hejmar 1 havîn 1987

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## NÛKIRINA KURMANCÎ

Kurmancî zarekî gelekî dewlemend e. Di hin warên jiyana rojane de, di peywendiyên bi xwezayê (tabîetê) re, peyvên wê ji yên zimanên mezin ên ewropayî kêmtir namînin. Mesela ji bo navên pez û dewaran, ji bo navên dengên tişt û heywanan de ew ji fransizî û îngilîzî jî zengîntir e. Ew berî rûsî û zimanên slav ên din bûye zimanekî edebî û hê di sedsalên XIV û XV de berhemên giranbiha dane.

Mixabin, ji bo sedemên siyasî, ji ber bindestketina gelê kurd û parvekirina welatê wî, rê li ber vê pêşveçûyina dîrokî hate bestîn, an asê kirin. Kurmancî wilo bê xweyî, li jêr êriş û gefên çandên biyanî kete sedsala XX an, ya nûjeniyê (moderniyê), ya rojname, radyo û televizyonê. Bi awayê ku civaknas dibêjin mirovahî di heftê salên dawîn de ji heft sed salên berê bêtir veguherînên civakî (sosyal) û çandî (kulturî) derbas kiriye. Çerxa dîrokê bereberê zûtir digere, bergehên mirovan frehtir dibin, nûyîtî li çar aliyên cihanê zûtir belav dibin, dinya hin bi bin "biçûktir" dibe. Di vê meşa han de qels, kulek, brîndar, naamade dikevin, û hin ji wan jî ji rûpelên dîrokê winda dibin.

Ji salên 1920î ve Kurdên Iraqê karîne bi kurmanciya xwarê ango bi "soranî" binivîsin, pirtûk, kovar û rojnameyan derînin. Zaroyên wan di xwendegahên despêkî û navîn de zimanê xwe yê dê dixwînin, di radyo ûtelevizyonan de bername û weşînekên "soranî" hene. Zimannasên kurd ên îraqê bi salan li ser pirsên rastnivîsîna "soranî" xebitîne, hê jî dixebitin. Lewre rewşa van ji ya kesên ku bi kurmancî dipeyivin (Kurdên Tirkiye, Sûrye, û yên bakura Kurdistana Îran û Iraqê, tevhîhev bêtirî 65% ê gelê kurd) pirr baştir e.

Xebatên ku di salên 1930-1940î de Kamran A. Bedirxan û Celadet Bedirxan pêk anîne ji bo rastnivîsîna kurmancî gaveke hêja ne. Lê pêşvebirin û kûrkirina vî karî ferz e, pirseke jindarî ye. Heke rojekê li perçeyeke Kurdistanê gelê kurd bigihê azadiya xwe, wê demê dê Akademiyeke ziman, bi riya imkan û gengaziyên dewletê (radyo-televizyon, rojname, xwendegah) li ser pirsên zimên biryaran bistîne û wan biryaran bide qebûl kirin. Lê ev roj dê kengî bê diyar nîne. Heye ku ta wê rojê, li jêr tesîra televizyon û xwendegahên tirkî û erebî birrekî mezin ê gelê kurd kurmanciya bav û kalên xwe ji bîr ke an jî tenê zimanekî jarketî, tevlihev bipeyve. Kurmancî jî bibe wekî zimanên îrlandî, welşî an brotonî, zimanekî "folklorî" ku tenê carna di govend û dîlanan de tê bi karanîn.

Welatparêzên xwedî berpisiyar, nemaze xwenda û ronakbîr, li ber sernivîşt û qederê serî natewînin, wekî berxên sernerm li hêviya kêra qesab namînin. Parastina zimanê pêşiyên me bingehê evîna welêt e, rehê jindarî yê welatparêziyê ye. Lewra divê ku her Kurdê welatparêz li gora karîn û zanîna xwe beşdarî vî şerê parastin û nûkirina kurmancî bibe.

Ji bo nûkirin û dewlemendkirina kurmancî Enstîtu salê du caran, her carê hefteyek nivîskar, zimannas û rojnamevanên kurmanc ên ji hemû navçeyên Kurdistanê dicivîne. Ew di her civînekê de li ser peyvnasiya (terminolojiya) şaxeke ziman dixebitin. Civîna bihara 1987 li ser rastnivîsîna navên rojan, mehan, hejmaran û li ser navên coxrafî xebitî. Biryarên vê civînê di rûpelên vê rojnameyê de tên belav kirin. Ewê heya payizê Enstîtu xarîteyeke cihanê û yeka Kurdistanê bi kurmancî çap bike û bixe nav xelkê.

Di vê civînê de pisporên kurd ên ji navçeyên Agirî, Şapûr (Kurdistana Îranê), Akre û Kerkûk (Kurdistana Iraqê), Hekarî, Diyarbekir û Mêrdînê (Kurdistana Tirkiye), hebûn. Ev civîn ji 18 ta 24ê nîsanê li bajarê Barselonayê, paytexta Navçeya xweser (otonom) a Kataloniyayê li Spanyayê çêbû. Civîna payîzê jî her li wî bajarî bi arîkariya hikûmata xweser a katalanî çê dibe û ewê li ser peyvnasiya (termînolojiya) siyasî û îdarî be.

Her Kurdek dikare pirs û pêşneyarên xwe yên li ser rastnivîsîna ziman ji "Komisyona kurmancî" ya Enstîtuyê re binivîse. Em hêvîdar in ku her Kurdê ku pê diqede dê arîkariya vê xebata bingehî bike. Bila pirsa ziman bibe ya heryek ji me, ya me hemûyan, pirsek neteweyî. Tenê bi vî awayî emê bikaribin di nav salan de kurmanciya me ya şêrîn ji talûke û gemaroyê rizgar bikin.

KURMANCÎ

## Encamên civîna Barselonayê

Nivîskar, rojnamevan û zimannasên kurd ên ku ji 18 ta 24ê nîsanê li bajarê Barselonayê (paytexta Katalonyayê) li ser pirsên rastnivîsîna kurmancî xebitîn gihane encamên (netîceyên) ku em di rûpelên vê rojnameya taybetî de belav dikin. Ewê Enstîtu piştî her civîneke zimanî hejmareke vê rojnameya *Kurmancî* derîne.

### RASTNIVÎSÎNA JIMARAN

| | | | |
|---|---|---|---|
| **0** | Sifir (Nîn) | **16** | Şazdeh |
| **1** | Yek | **17** | Hevdeh |
| **2** | Du, dido | **18** | Hejdeh |
| **3** | Sê, sisê | **19** | Nozdeh |
| **4** | Çar | **20** | Bîst |
| **5** | Pênc | **21** | Bîst û yek |
| **6** | Şeş | **30** | Sî |
| **7** | Hef | **31** | Sî û yek |
| **8** | Heşt | **40** | Çil |
| **9** | Neh | **50** | Pêncî |
| **10** | Deh | **60** | Şêst |
| **11** | Yazdeh | **70** | Heftê |
| **12** | Dozdeh | **80** | Heştê |
| **13** | Sêzdeh | **90** | Nod |
| **14** | Çardeh | **100** | Sed |
| **15** | Panzdeh | **101** | Sed û yek |

**200** : Du sed; **1000**: Hezar;
**1 000 000**: Milyon; **1 000 000 000**: Milyar;
**1 000 000 000 000** (1 000 milyar): Trîlyon

### JIMARÊN RÊZÊ

| | | |
|---|---|---|
| **1.** Yeka | yekem | yekemîn |
| **2.** Didoyan | duyem | duyemîn |
| **3.** Sisêyan | sêyem | seyemîn |
| **4.** Çaran | çarem | çaremîn |
| **5.** Pêncan | pêncem | pêncemîn |
| **6.** Şeşan | şeşem | şeşemîn |
| **7.** Heftan | heftem | heftemîn |
| **8.** heştan | heştem | heştemîn |
| **9.** Nehan | nehem | nehemîn |
| **10.** Dehan | dehem | dehemîn |
| **11.** Yazdehan | yazdehem | yazdehemîn |
| **20.** Bîstan | bîstem | bîstemîn |
| **30.** Siyan | siyem | siyemîn |
| **40.** Çilan | çilem | çilemîn |
| **50.** Pênciyan | pênciyem | pênciyemîn |
| **60.** Şêstan | şêstem | şêstemîn |
| **70.** Heftêyan | heftêyem | heftêyemîn |
| **80.** Heştêyan | heştêyem | heştêyemîn |
| **90.** Nodan | nodem | nodemîn |
| **100.** Sedan | sedem | sedemîn |

# NAVÊN COXRAFÎ




## AMERÎKA

| | |
|---|---|
| Kanada | Otawa |
| Alaska | Xelîca Alaskayê |
| Dewletên Yakbûyî yên Amerikayê | Waşîngton (Washington) |
| Kuba | Havana |
| Haîtî | PortoPrens |
| San Domînîk | Santo Dominigo |
| PortoRîko | SanJuan |
| Antîlên Mezin | |
| Antîlên Biçûk | |
| Meksîka | Meksîko |
| Belîz | |
| Belmofan | |
| Guatemala | Guatemala |
| Salvador | San Salvador |
| Hondûras | Tegucigalpa |
| Nikaragua | Managua |
| Kosta Rîka | San Jose |
| Panama | Panama |
| Kolombya | Bogota |
| Venezuela | Karakas |
| Brazîl | Brazîlyla |
| Giyana | Corc Tawn-Amazon |
| Sûrînam | Paramarîbo |
| Giyena Fransayê | Kayen |
| Ekwador | Kîto |
| Perû | Lîma |
| Bolîvya | La Paz |
| Paraguway | Assunsiyon |
| Arjantîn | Buenos Aires |
| Ûrûguway | Montevîdeo |
| Şîlî | Snatiyago |
| Girava mezin a Agiristanê | |
| Tengava Macelan | |
| Malvînas (Falkland) | Stanley |
| Xelîca Sen Xorxê | |
| Xelîca Korkovado | |
| Girava Corciya Başûr | |
| Tengava Dêwan | |
| Antîlên Başûr | |
| Welatên Graham | |

## EWROPA

| | |
|---|---|
| **-Fînlanda** | Helsinkî |
| **-Swêd** | Stokholm |
| **-Norwej** | Oslo |
| **-Danmark** | Kopenhag |
| **-Îsland** | Reykyawîk |
| **-Gronland** | |
| **-Faroarna** | |
| **-Brîtanya Mezin** | London |
| **-Îngilîstan** | |
| **-Îrlanda Bakur** | Belfast |
| **-Skotland** (Scotland) | Glasgow |
| **-Wêls** | |
| **-Îrland** | Dublin |
| **-Polonya** | Warşova |
| **-Çekoslovakya** | Prag |
| **-Romanya** | Bûxarest |
| **-Macaristan** | Budapest |
| **-Bulgaristan** | Sofya |
| **-Yunanistan** | Atîna |

| | |
|---|---|
| **-Albanya** | Tîrana |
| **-Yûgoslavya** | Belgrad |
| **-Otriş** | Viyen |
| **-Lîxtinştayn** | |
| **-Îtalya** | Roma |
| **-Malta** | Valleta |
| **-Sardînya** | Kyalerî |
| **-Korsîka** | Bastya |
| **-Swîs** | Cenev |
| **-Fransa** | Parîs |
| **-Monako** | Monte Karlo |
| **-Spanya** | Madrîd |
| **-Andora** | |
| **-Portugal** | Lîsbon |
| **-Almanya** | |
| **-Rojhelat** | Berlîna Rojhelat |
| **-Almanya Rojava** | Bon |
| **-Luksembûrg** | |
| **-Beljika** | Brukesl |
| **-Hollanda** | Amsterdam |






## ASYA

| | |
|---|---|
| **Afxanistan** | Kabul |
| **Pakistan** | Îslamabad |
| **Hind** | Delhî |
| **Srî Lanka** | Kolombo |
| **Bengladeş** | Dakka |
| **Bûrma** | Rangûn |
| **Tayland** | Bangkok |
| **Kamboçya** | Phnom Pen |
| **Laos** | Viyang Şan |
| **Viyetnam** | Hanoy, Ho Şî Mîn |
| **Maleziya** | Kuala Lumpur |
| **Sîngapûr** | |
| **Endoneziya** | Cakarta, Bandûng |
| **Gineya Nû** | Port Moresbî |
| **Awistralya** | Sîdney (Sydney) |
| **Zelanda Nû** | Wellington |
| **Kaledonya Nû** | Nûmeya (Noumea) |
| **Giravên Silêman** | |
| **Fijî** | |
| **Filîpin** | Manîla |
| **Taywan** | Taypê |
| **Hong Kong** | Viktoriya (Victoria) |
| **Çîn** | Pekîn (Beyjing) |
| **Nepal** | Katmandû |
| **Bûtan** | |
| **Moxolistan** | Ûlan Batûr |
| **Koreya Bakur** | Piyongyang |
| **Koreya Başûr** | Seûl |
| **Japon** | Tokyo |
| **Yekîtiya Sovyetî** | Moskov |

## AFRÎKA

| | |
|---|---|
| **Misr** | Qahîre |
| **Lîbya** | Trablûs |
| **Tûnis** | Tûnis |
| **Cezayir** | Cezayir |
| **Mexrib** (Marok) | Rebat |
| **Sehra** | |
| **Sehraya Rojava** | El Eyûn |
| **Giravên Kanariyê** | |
| **Morîtanya** | Nûakşot |
| **Malî** | Bamako |
| **Senegal** | Dakar |
| **Gambiya** | Banjûl |
| **Gîneya Bisao** | Bîsao |
| **Gîne** | Konakrî |
| **Siyera Leon** | Frîtawn (Free Town) |
| **Lîberya** | Monrovya |
| **Kotdîvuwar** | Abidcan |
| **Gana** | Akra |
| **Bûrkîna Faso** | |
| **Voltaya Jorîn** | Wanadûgû |
| **Togo** | Lome |
| **Benen** | Kotonû |
| **Nîjerya** | Lagos |
| **Kamrûn** | Yaûnde |
| **Gîneya Ekwatorî** | Malabo |
| **Nîjer** | Niyamey |
| **Çad** | Nicame`na |
| **Sûdan** | Xartûm |
| **Afrîka Navendî** | Bangî |
| **Etyopya** | Adîs Abeba |
| **Erître** | Esmere |
| **Cibûtî** | Cibûtî |
| **Somalya** | Mogadîşû |
| **Kenya** | Nayirobî |
| **Ûganda** | Kampala |
| **Rwanda** | Kîgalî |
| **Brundî** | Bujumbura |
| **Tanzanîka** | Dar Es Selam |
| **Malawî** | Blantîre |
| **Mozambîk** | Mabûto |
| **Madagaskar** | Antana Narîvo |
| **Kanala Mozambîkê** | |
| **Girava Rewinyon** | |
| **Girava Morîs** | |
| **Zengîbar** | Zengîbar |
| **Zîmbabwe** | Salsbûry |
| **Swaziland** | Mbabane |
| **Lesoteo** | Maserû |
| **Afrîka Başûr** | Pretorya |
| **Botswana** | Gabaron |
| **Namîbya** | Windhûk |
| **Zambiya** | Lûsaka |
| **Angola** | Lûanda |
| **Zaîr** | Kînşasa |
| **Kongo** | Brazîl |
| **Gabon** | Librvîl |

## OQYANÛSYA

**Antartîka**
**Oqyanûsa Arktîk**
**Polînezya**
**Mîkronezya**
**Melanezya**




| **TIRKIYE** | **IRAQ** | **SÛRIYE** | **ÎRAN** |
|---|---|---|---|
| Enqere | Bexda | Şam | Taran |
| Edene | Besra | Heleb | Tewrêz |
| Stembol | Kerbela | Hums | |
| Qeyserî | Kûfe | Lazkiye | |
| Qonya | | Dêrezor | |
| Antaxya | | | |
| Îskenderûn | | | |

## ROJHELAT

| | | | |
|---|---|---|---|
| **Lubnan** | Beyrûd | **Mîrîtiyên Erebî yên Yekbûyî** | Ebû Zebî |
| **Îsraîl** | Tel Avîv - Quds | **Bahreyn** | Mename |
| **Urdin** | Amman | **Uman** | Mesqet |
| **Kuweyt** | Kuweyt | **Qibris** | Levkosia |
| **Erebistana Seûdî** | Riyaz | **Yemena Başûr** | 'Eden |
| **Yemena Bakûr** | Sen'a | **Qetar** | Dohe |
| **Dubey** | Şarîqe | | |

## DEMÊN SALÊ

Di salê de çar **dem** an werz (mewsim) hene:
BIHAR, HAVÎN, PAYÎZ û ZIVISTAN
Her dema salê sê meh dom dike.

**Mehên biharê**: Adar, Nîsan, Gulan
**Mehên havînê**: Hezîran, Tîrmeh, Tebax
**Mehên payîzê**: Îlon, Çirî, Teşrîn
**Mehên zivistanê**: Kanûn, Çile, Sibat

## NAVÊN MEHAN

| *kurdî* | *almanî* | *fransizî* | *îngilîzî* | *tirkî* |
|---|---|---|---|---|
| Çile | Januari | Janvier | January | Ocak |
| Sibat | Februar | Février | February | Şubat |
| Adar | März | Mars | March | Mart |
| Nîsan | April | Avril | April | Nisan |
| Gulan | Mai | Mai | May | Mayıs |
| Hezîran | Juni | Juin | Juni | Haziran |
| Tîrmeh | Juli | Juillet | July | Temmuz |
| Tebax | August | Août | August | Agustos |
| Îlon | September | Septembre | September | Eylül |
| Çirî | Oktober | Octobre | October | Ekim |
| Teşrîn | November | Novembre | November | Kasım |
| Kanûn | Dezember | Décembre | Decembe | Aralık |

## ROJÊN HEFTÊ

Gotina **hefte** ji jimara heft tê, bi xwerû kurdî ye.
Di **hefteyekê** de heft roj hene. Va ne navên rast ên van rojan û wergerandina wan a bi zimanên biyanî:

| *kurdî* | *almanî* | *fransizî* | *îngilîzî* | *tirkî* |
|---|---|---|---|---|
| Yekşem | Sonntag | Dimanche | Sunday | Pazar |
| Duşem | Montag | Lundi | Monday | Pazartesi |
| Sêşem | Dienstag | Mardi | Tuesday | Salı |
| Çarşem | Mittwoch | Mercredi | Wednesday | Çarşamba |
| Pêncşem | Donnerstag | Jeudi | Thursday | Perşembe |
| Înî | Freitag | Vendredi | Friday | Cuma |
| Şemî | Samstag | Samedi | Saturday | Cumartesi |

hejmar 2 zivistan 1988

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## BARSELONA 2

Nivîskar, rojnamevan û zimannasên kurd ên dervayî welêt salê du caran, di bihar û payîzê de, ji bo hefteyekê dicivin, li ser pirsên rastnivîsîn û nûkirina kurmancî dixebitin.

Di civîna bihara 1987 an de giraniya xebatê li ser peyivnasiya (terminoloijiya) coxrafî û li ser rastnivîsîna navên rojan, mehan û hejmaran bû. Navên welatên cihanê, ên çiya, deşt, çem û bajarên sereke, bi zimanê kurmancî hatin tesbît kirin. Encamên civînê di hejmara 1a rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî *Kurmancî* de hatin belav kirin. Ji ber van encaman nexşeyeke (xarîteyeke) rengîn a cihanê bi zaravayê kurmancî hate pêk anîn û çap kirin.

Civîna payizê ji 7 ta 14 teşrîn 1987an de dîsa li bajarê Barselonayê (paytexta Katalonyayê), bi arîkariya dostane ya hikûmeta otonom a katalanî çê bû. Di civînê de ji rojhelat ta rojava, ji bakur ta başûrê navçeyên kurmancîaxêvên Kurdistanê çibigre ji her herêmê beşdar hebûn. Di rojên pêşîn ên civînê li ser navên coxrafî yên Kurdistanê hate xebitîn. Di şêst salên dawîn de dewletên ku welatê me li hev par kirine navên piraniya bajar, bajarok, deşt û çiyayên me jî guherîne, navên nû li van danîne. Guhartina navan destpêka guhartina zanava (huwiyeta) kesekî, gelekî an welatekî ye. Lewra gava ku Konkîstador ên spanî an dagîrkerên brîtanî an îgilîz welatek zevt dikirin tafil navên nû li wan datanîn û, piştî çend nifşan (neslan), derveyî çend zana û dîroknasan, kesî êdî navên kevn ên van welatan nedizanî.

Di sedsala XX an de li me jî wilo qewimiye. Welatê me ji me re bûye biyanî (xerîb). Em Kurdên Îran û Iraqê li aliyekî bihêlin, îro çend Kurdên Tirkiyê dizanin ku navê kurdî yê *Adiyamanê* Semsûr e, ku yê *Kurtalanê* Misric e, *Bingol, Çewlik e...*

Ji bo ku ev nav neyên ji bîr kirin, nifşên nû ew binasin, Enstitu ji ber encamên vê civîna payizê xarîteyeke rengîn a Kurdistanê da çap kirin, tê de navên kevn ên bajar, bajarok, çem, gol, deşt û çiyayên Welatê Kurdan bi awayekî zanistî bi cî kir û li bin navan, di nav kevanekan de, navên wan ên resmî jî nivîsî da ku welatiyên me çêtir tê bigihên. Weka her xebata destpêkî ev xarîta jî bê kêmasî û şaşî nîne. Ewê di çapa duwemîn de bên rast kirin.

Di bernameya Civîna payizê de hin pirsên din jî hebûn: navên îdarî, navên meywe û heşinatiyan, reng, hwd... Bi carekê bersîvdana pirsên wilo freh mimkin nebû. Pirsên ku hatine safî kirin di vê hejmara Kurmancî de tên belav kirin. Ên din ewê gav bi gav, piştî şêwr û lêgerînên bêtir, di civînên pêşiya me de zelal bibin. Herwekî di encamên vê Civînê de jî dixuye amanca vê xebatê çêkirina peyv û gotinên nû nîne. Heya ku ji me tê, em lê digerin ka li navçeyên cihê yên Kurdistanê ji bo tiştekî çi nav bêtir tê bi kar anîn. Em wî navî û, heke ku hebin, guhartoyên (variyantên) wî yên deverî tesbît dikin û belav dikin. Gava ku di tu zaravê kurdî de ji bo tiştekî an mefhûmekê navek nîn be, wê demê li ser çêkirina peyveke nû, li gora aheng û mantiqa kurmancî, diponijin. Baş di bîra me de ye ku zimanekî çêkirox, zêde *xwerû û petî* heye ku dilê hin ronakbîr û xwendayan xweş bike lê piraniya xelkê tê nagihê, xelkê ji hevûdu û ji xwendayan dûr dixe. Gava ku Kurdekî ji rêzê, hinek bi xwendin û nivîsandinê dizane, bikaribe bi serbestî, bi zimanê xwe yê rojane, kovar an romaneke kurdî bixwîne û jê zewq bistîne emê bikaribin bêjin ku kurmancî êdî bi rastî bû, an cardin bû zimanekî nivîskî yê gelêrî. Zimanê ku bi frehî hate nivîsandin û xwendin jî êdî zû bi zû winda nabe. Amanc û merema xebata me jî her ev e.

KURMANCÎ

### ENCAMÊN CIVîNA PAYÎZÊ

*Nivîskar, rojnamevan û zimannasên kurd ên ku ji 7 ta 14ê teşrîna 1987an li barjarê Barselonayê li ser pirsên rastnivîsîna kurmancî xebitîn, gihane encamên (netîceyên) ku em di rûpelên vê rojnameya taybetî de belav dikin.*

## RENG

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| spî | beyaz | blanc | white |
| reş | kara | noir | black |
| sor | kırmızı | rouge | red |
| zer | sarı | jaune | yellow |
| kesk, sewz | yeşil | vert | green |
| şîn | mavi | bleu | blue |
| qehweyî | kahverengi | marron | brown |
| qemer | yağız | basané | swarthy |
| qemerê vekirî, esmer | esmer | brun | dusky |
| gewr, spiyê girtî | açık gri, açık | clair, gris clair | light, light grey |
| qerqas, çîl spî | bembeyaz | blanc éclatant | bright white |
| binevşî, mor | mor | violet | purple |
| pembe | pembe | rose | pink |
| erxewanî | şarabrengi | pourpre | crimson |
| kej | kumral, sarışın | blond | blond, fair |
| bor | kızıl | roux | red-haired, redhead |
| boz | boz | gris-pommelé | dapple-grey |
| çûr | açık sarı | jaune clair | light yellow |
| qîçik | saman sarısı | jaune paille | straw colour |
| qer | parlak siyah | noir brillant | bright black |
| şê (qehweyê bi sorayî ve) | al (at için) | alezan | chestnut |
| genimî | açık esmer | couleur de blé | wheat colour |
| şîrî | sütbeyaz | opalin, laiteux | opaline |
| xakî | haki | kaki | khaki |

## MEYWE

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| sêv | elma | pomme | apple |
| porteqal | portakal | orange | orange |
| hirmê | armut | poire | pear |
| hêjîr | incir | figue | fig |
| hinar | nar | grenade | pomegranate |
| zebeş, şûtî | karpuz | pastèque | watermelon |
| xox | seftali | pêche | peach |

| | | | |
|---|---|---|---|
| tirî | üzüm | raisin | grapes |
| kelek,gundor, petêx, qawin, qire | kavun | melon | melon |
| arûng, zerdele, qeysî, mişmiş | kaysı | abricot | apricot |
| tûtfrengî | çilek | fraise | strawberry |
| tû | dut | mûre | blackberry |
| behîv | badem | amende | almond |
| gûz | ceviz | noix | walnut |
| gêlaz, qeresî | kiraz | cerise | cherry |
| wîşne | vişne | griotte | morello cherry |
| biyok, bih | ayva | coing | quince |
| alûçe | yeşil erik | mirabelle | green plum |
| încas, hulûreş | kara erik | prune | blak plum |
| lîmon | limon | citron | lemon |
| mûz | muz | banane | banana |
| mandarîn, klementîn | mandalin | mandarine, clémentine | mandarin, clémentine |
| fistiq, piste | fıstık | pistache | pistachio |
| findiq, bindeq | fındık | noisette | hazelnut |
| bitim | bıtım | lentisque | |
| kezwan, şînok | menengüç | térébinthe | |
| givîj | akdiken | aubépine | hawthorn |
| xurme, qesp | hurma | datte | date |
| hembelaz, xatûnok | | | |
| dendûreşk | böğürlten | mûre sauvage | bramble |
| ananas | ananas | ananas | pine apple |
| şekok, girsik | ahlat | poire sauvage | wild pear |
| tihok, tawik | dağdağan | baie de sureau | elderberry |
| belût | palamut | gland | acorn |
| kestane | kestane | chataîgne | chestnut |
| tereqî | nektarin | nectarine | nectarin |
| zeytûn | zeytin | olive | olive |

## HÊŞÎNAHÎ - S E W Z Î

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| pîvaz | soğan | oignon | onion |
| sîr | sarmısak | ail | garlic |
| pîvazterk | yeşil soğan | oignon | shullot |
| xiyar, arû | salatalık | concombre | cucumber |
| bejik | kıtır | variété de concombre | variety of cucumber |
| acûr | acur | conbombre russe | russian cucumber |
| îsot | biber | poivron | green |
| kelem | lahana | chou | pepper |
| gulkelem | karnıbahar | chou-fleur | cabbage |
| kelemê Brukselê | Brüksel lahanası | chou deBruxelles | cauliflower |
| | | | Brussels sprout |
| sorkelem | kızıl lahana | chou rouge | red cabbage |
| kartol, patat, qompîr | patates | pommes de terre | potato |
| sêvaxîn | yerelması | topinambour | helianthe tuberaux |
| xes | marul | laitue | lettuce |
| gizêr | havuç | carotte | carrot |
| pirasa | pırasa | poireau | leek |
| şiwît | dereotu | fenouil | fennel |
| bexdenûs | maydanoz | persil | parsley |
| firingî, şamik, bacanê sor, temate | domates | tomate | tomato |
| balican, bacan | pathcan | aubergine | aubergine,eggplant |
| fasûlye, lobî, lobye | fasulya | haricot | bean |
| nok | nohut | pois-chiche | chickpea |
| nîsk | mercimek | lentille | lentil |
| maş | börülce | féerole, faséol | horse bean |
| baqil | bakla | fève | broad bean |
| tevrik, tivir | turp | radis | radish |
| binerdik | şalgamın bir türü | variété de navet | variety of turnip |
| şêlim | şalgam | navet | turnip |
| silk | pancar | betterave | beet |
| silka sor | kırmızı pancar | betterave rouge | beetroot |
| silkên şekir | şeker pancarı | betterave sucrière | sugar beet |
| kundir, kulind | kabak | courge | marrow, pumpkin |
| dolmik, rextik | kabak | courgette | courgette |
| bamiye | bamya | gambo, bamias | okra, gumbo |
| engînar, neynokên bûkê | enginar | artichaut | artichoke |
| xerdel | hardal | moutarde | mustard |
| meroje, kiling | kuş konmaz | asperge | asparagus |
| garis | darı | millet | millet |
| lazût, gilgilê Stembolê, garisê Stembolê, genimê Şamê, genimok | mısır | maïs | Indian corn, corn |
| rêwas, rûbês | ravent, okçul | rhubarbe | rhubarb |
| îspanax, silqok, siyele | ispanak | épinard | spinach |
| karî, kuvark, kumik, figerojşk, karkulîlk | | | |
| karok | mantar | champignon | mushroom |
| tûzik | tere | cresson | watercress |
| tolik | ebegümeci | mauve | mallow |
| rihan | fesleğen | basilic | basil |
| pûng | yarpuz | menthe sauvage | spearmint |
| kereng | kenger | chardonnette | cardoon |
| nane, pûjan | nane | nane | mint |
| catirî | kekik | marjolaine | marjoram |
| sîrik | yabani sarmısak | ciboule | scallion |
| sîrim | | ciboulette | chive |

## PEYVEN KURDÎ DI KLASÎKÊN ME DE

# *Mewlûda Kurmancî*

*Reşo ZÎLAN*

**Mewlûda Kurmancî** ya ku em ê lê piçekî hûr binihêrin û hin peyvên kurdî yên ku tê de derbas dibin, berpêşî we bikin, ya Mela Huseynê Bateyî ye. Ji bilî mewlûdnameya Bateyî, Mela Ebdilkerîm Mideris û Mih-emede Reşad El-Miftî ji mewlûdname nivîsandine. Di nav van herdukan de mewlûdname ya El-Miftî bêtir nêzîkî ya Bateyî ye. Di van salên dawin de, melayek ji melayên Kurdistana bakur, mewlûdnameya Bateyî li gor zanîn û kurdiya xwe, bêî ku kêşa wê ya yazdeh kîteyî têk bide, kiriye kurmanciyeke nû. Di van hiç

yekê de tam û çêja rastîn ya mewlûdnameya BATEYÎ dîtin ne mumkun e. Mewlûdnameya Bateyî, bê guman ji hemûyan têkûztir, edebîtir, giranbihatir û binavûdengtir e. Ev di nav şêniyên Kurdistanê de, yên ku bi zaravayê kurmancî dipeyivin, gelekî belav bûye û nas e. Mirov bê şik dikare bibêje, ku di nav klasîkên kurdî de ya herî bêtir çap û belav bûye, nas e û tête xwendin, Mewlûda Kurmancî ye. Dêlindêzên xwendin û dayîna mewlûdan êdî ji roleke olî û ayinî bêtir, roleke civakî dilîzin. Ew gelek caran ji bo bîranîna miriyan, pîrozkirina di tistekî de biserketinê, bi sax û xwe,sî ji xerîbî û eskeriyê vegerê û herweha ji bo belavkirina xêr û qenciyê û hwd. tête xwendin û dayîn.

Gelo Mala Huseynê Bateyî kî ye û çi kes e ? Çi berhem û afirandinên wî hene ? Herçendî ev pirs ne babeta vê nivîsarê be jî, dîsan jî pêwîst e ku em gelekî bi kurtî li ser van pirsan rabiwestin.

Gelek kesên ku li ser BATEYÎ û mewlûdnameya wî nivîsandine; Bilîç Serko, M.Emin Zekî, 'Elaeddîn Sucadî, Herekol Azîzan, Prof. Qanatê Kurdo, Dr. Kemal Fûad, E.B. Soane, Thomas Bois, V.F. Mînorsky û gelekên din, bêî ku bi belge bipeyîtînin, dibêjin navê wî "Mela Ehmedê Bateyî" ye. Lê heçî navê "Ehmed" e, wî hiç li cîhekî û li hîç helbestekê bi kar neaniye welê xûya dike ku çavkaniya vî navî, A. Jaba ye. Herwekî tête zanîn A. Jaba, balyozê Rûsyayê li Erziromê, hemû agehî û enformasyonên xwe yên li ser klasîkên kurdî û nivîsevanên wan ji Mela Mehmûdê Beyazidî wergirtiye. Mixabin gelek ji wan jî şaş in. Wisan diyar e, ku cara pêşîn ev nav bi şaşî bi riya pirtûka A. Jaba belav bûye û yên din jî jê û ji hev wergirtine. Di çapeke Stembolê û her weha di çapa Gîw Mukriyanî ya Mewlûda Kurmancî de navê wî "Hesen" hatiye nivisîn, ku ev jî ne rast e. Lê navê rastî yê xwedî û nivisevanê Mewlûda Kurmancî, her wek neviyên wî bi xwe jî dibêjin û di nav mela, feqî û şêniyên Kurdistanê de belav e û di pişta mewlûdnameya wî de jî hatiye nivîsîn, Mela Huseynê Bateyî ye. Ew bi xwe ji eşîra Hertoşîyan (Ertroşiyan) e û ji gundê Bateyî ye. Ev gund li herêma Hekariyan e û dikeve nêzîkî geliyê Tiyarê û gundê Marûnis.

Tête texmîn kirin, ku wî di medreseya Mîr Hesenê Welî de, li gundê Muksê xwendiye. Ev medrese, medresa mezin û binavûdeng e. Dibêjin carina heya 300 feqeh lê dixwendin û qasî 10 mamosteyan jî tê de ders didan. Wî piştî dawîanîna xwendina xwe ya medresê, bi xwe ders dane feqihan. Ew bi zanist û nivîsîna helbestan ve mijûl bûye. Herweha çûye hec û helbesta xwe ya "Hilo raba Ebû el-Qasim" li ser gora pêxember gotiye.

Heçî zanîna dem û zemanê ku ew tê de jiyaye, yek car dijwartir e. Gelek kesan, wek A. Jaba, B. ∑erko, M.E. Zekî, 'E. Sucadî, H. Azîzan, Prof. Q. Kurdo, T. Bois, V.F. Mînorsky û gelekên din gotine ku ew di navbera salên 820-900-ê koçî, ango 1417-1495-ê zayînî de jiyaye. SADIQ Behadin Amêdî, Bateyî hevçaxê Mela Mensûrê Gêrgaşî nîşan dide. Mela Mensûrê Gêrgaşî ji gundê Gêrgaşê ye. Ev gund dikeve başûra rojhelata Amêdiyê. Mela Enwerê Mayî dibêje ku "Ew di sedsala 11-an ya koçî de jiyaye, ango di sedsala 17-an ya zayînî. Lê herwekî mewlûdname ji aliyê olperestî û dîndariyê de afirandineke gelekî girîng e û cihê wê di dêlindêzên ayînî de bi qedr û rûmet e, ji aliyê kesekî wek Ehmedê Xanî (1650-1707) de nenasbûna wê pirseke girîng tîne pêşberî me. Heke hebûna wê ji aliyê Xanî ve bihata zanîn, ji wê çêlnekirin ne mumkun bû. Xanî, pêxemberê me yê neteweyî, di sertaca edebîyata kurdî Mem û Zînê de navê Bateyî nehaniye. Wî, di van malikan de navê Eliyê Herîrî, Melayê Cizîrê û Feqiyê Teyran aniye û rûmeta berhem û afirandinên wan girtiye û gotiye ;

*Min dê 'alema kelamê mewzûn*
*'Alî bikira li banê gerdûn*
*B'nave ruhê Melayê Cizîrî*
*Pê hey bikira 'Eliyê Herîrî*
*Keyfek we bida Feqiyê Teyran*
*Heta bi ebed bimayî heyran*
*Çib'kim ko qewî kesade bazar*
*Nînin ji qumaşî re xerîdar*

Ne xwe, heke Bateyî berî Xanî jiyaba û mewlûdname nivîsîba, divabû Xanî jê çêl bikira. Yan na, ji XANÎ re dibû kêmasîyeke mezin. Dîtina ev celeb kêmasî û li milekî din jî aliyê Xanî de nezanîn pûtepênedan û nedîtina mewlûdnamê ne mûmkun e. Rastiyeke din jî heye, ku mewlûdname û toreya xwendin û dayîna mewlûdê derengtir ketiye nav civata kurdî. Ji ber vê yekê ye, ku mewlûdnameyên bi zaravayê kurdiya jêrîn û bi zaravayê kurdiya dimilî jî ne xwedi tarixeke hinde direj in. Ev yek jî wê baweriyê dide me, ku Mewlûda Kurmancî ne ji sedsala 15-an e. Lê heye ku ew piştî Xanî, yan jî çend sal berî mirina wî, ango ji destpêka sedsala 18-an be...

Mewlûda Kurmancî heya niha gelek caran hatiye çap kirin. Destnivîsara herî kevn ku me dîtiye, ji sala 1270-yê koçî, agno 1853-yê zayînî ye. Ew bi destê kesekî ku navê Wî Ebdulhemîd e, hatiye nivîsîn. Rojhelatnas Albert von Le Coq ew destnivîsar di sala 1901-2-an de li ∑amê bi dest xistîye û piştre ew aniye Ewropayê. Ew destnivîsar niha Ii kitêbxaneya "Staatsbibliothek" Marburg/Berlinê ye.

Cara pêşîn A. von Le Coq di sala 1903-an de Mewlûda Kurmancî li Berlînê çap dike. Ew ji ber destnivîsara Mela Mihemedê Wanî, ku ji sala 1888-an e, bi awakî fotolîtografik hatiye çap kirin. Bi dû re Ehmed Ramîzê Liceyê di sala (1324) 1906-an de li Qahîrê çap kiriye. Mewlûda Kurmancî disan di sala 1906 û 1919-an de li Stembolê, di 1933an de bi destê Celadet Bedirxan li ∑amê di (1350) 1931-an de li Stembolê, di 1966-an de bi destê Gîw Mukriyanî li Hewlêrê, di 1977 (?)-an de dîsan li Hewlêrê û di 1982-an de ji aliyê S.B. Amêdî de li Bexdayê hatiye çap kirin. Lê ev çap ji ya xwerû û orjinal cihêtir e. Mewlûdnameya Bateyî heya niha gelek caran li Kurdistana bakur foto-ofset, hatiye çap kirin. Lê bêî ku tarixa li ser bête guhartin û şaşiyên çapê bên rastkirin. Mewlûda Kurmancî di forma mesnewî de ye, ji 564 malikan û ji 18 beşan pêk hatiye. Malikên wê gişt ji 11 kîteyan pêk tên û kêşa wê li ser 11-an e. Rojhelatnas Wetzstein dibêje, ku "∑êx BATÊ yê Kurdan mewlûda *Îbn Hecer* bi helbestkî kiriye'kurdî". Lê di rastiyê de wî jê îlham wergirtiye, ne ku her yekser ew wergerandiye kurdî.
Destpêka Mewlûda Kurmancî weha ye ;

*Hemdê bê hed bo Xudayê 'alemîn*
*Ew Xudayê daye me dînê mubîn*

Dawiya wê jî weha ye :

*Bo cemî'e muslimîn û salihe*
*Bo feqîrê Bateyî el-fatihe*

Di dawiya her beşekê de ev neqarat heye;

*Ger divêtin hûn ji narê bin necat*
*B'işq û şewqek hûn bibêjin es- selat*

Gelek nivîsevan û lêger dinivisin û dibêjin ku ji bilî mewlûdnamê çend tiştên din yên Bateyî hene. Wek dîwaneke çîroka Zembîlfiroş, û hwd. Lê heya îro ji çend helbestên Bateyî û pê de çu tiştek bi dest neketiye. Heçî çîroka Zembîlfroş e, ew ne ya Bateyî ye. Lê ew ya Miradxwanê Beyazîdî ye.

## BEŞ I

**Namwer (Namuwer)** *(f)* Xudannav, xwedînav
**Mar û mûr** Mar ji bo heywanên dixuşin (rawir) û mûr jî ji bo bihukan ango rawir û bihuk.
**Negotî** Eşkerenekirî, diyarnekiri, ji dev derneketî
**Der** *(f)* Li, di... de, di nav de.
**Karsaz (karisaz)** Kesê ku karekî bi rêk dixe û çêdike, çêker, xaliq
**Bende** Kole, bendî, 'ebd
**Mihriban** *(f)* Dilovan, bi şewqet, bi muhabet, rûxoş, xûynerm
**Bedîd-Pedîd** *(f)* Pendî, eşkere, aşikar, berçav
**Ba** *(f)* Bi
**Aferîd** Afirand, xulq kir
**Ala** Di kurmanciya nûjen de ev peyv wek AL hatiye nivîsîn û bi kar anîn. A rastî ne Al e, lê herwekî di zaravayê jêrîn de têt gotin, ALA ye. Ango; perçem, beyreq
**Zeman** Dem, çax, wext
**Aferîn** Bijî !

## BEŞ II

**An** *(f)* Bîsk, kêlîk, xêlek, lehze
**Hin** *(e)* Bîsk, kêlîk, xêlek, lehze
**Darû** *(f)* Derman
**Dîde** *(f)* Çav
**Bînahî** Hêza dîtinê, dîtin
**Destegîr** Alîkar, destgîr, kesê ku bi destan digre
**Gunehkar** Kesê ku gunehek kiriye
**Penah** *(f)* Parêzgeh, star
**Pûşt** *(f)* Pişt, piştevan
**Rahnî** Ronahî, ronakî
**Asîman, asûman, asîman** *(f)* Asman,'ezman
**Rewan, revan** Tiştê ku diçe, diherike; li vir: jîn
**Xakî pa** *(f)* Xweliya pê, axa (toz) pê
**Lew** Lewma, loma, ji ber vê/wê
**Goşîdar, gûşdar** *(f)* Guhdar
**Karûbar** Kar û xebat
**Xweşnewa** *(f)* Xeş, xweşdeng
**Çerx** Daxdar
**Daxîdar** Daxdar, birîndar

*(f)* : Ango bi farisî ye.

## BEŞ III

**Dergeh** Derî
**Koh, Kûh** Çiya, şax, kirr
**Fer** Teyîsok, îskok, birqok
**Hember** Bergind, bergîdan
**Bexşîn** Dayin, lê borîn
**Dîger** *(f)* Yê/ya din
**Hilbûn** Vêketin, pêketin (Çira hilbû = çira vêket, Agir hilbû = agir vêket, Agir hilkirin = agir dadan, agir vêxistin)
**Hemnişîn** Pêkve rûniştî, hevrûniştî
**Çavxirab** Çavneçê, çavpîs
**Pur** Maneya rastî ya vê peyvê, herwek di zaravayê jêrin de tête bi kar anîn, tijî, dagirtî ye. Bi kurdî ne **pur** lê **pir** e. Li vir bi maneya gelek de ye.
**Şiyan** Karîn, şekirin
**Cergebez** Govenda ku jin û mêr bi hev re digrin, reşbelek. Wekî din maneya qelebalix jî dide.
**Lêk** Li yek û du, li êk û du, ji hev, jê
**Huşyar bûn** Hişyar bûn; li vir: agehdar bûn, haydar bûn.

---

### AL AN ALA ?

Hin Kurdên Tirkiyê di van salên dawîn de ji bo **perçem** (tirkî: *bayrak*, fransizî: *drapeau*, îngilîzî: *flag*) peyva **al** bi kar tînin. Ev peyv xwerû kurdî ye û gelekî kevn e, lê rastiya wê **ala** ye, ne **al** e. Melayê Batê di Mewlûda kurmancî de ev gotin wilo bi kar aniye:

*Ya Reb imanê dixwazin em mudam*
*Jêrê alaya Muhemed wesselam.*

* * *

## KEY Û KEVANÎ

Kurdên ku gotina **kevanî** yê nizanibin kêm in. Piranî ew bi mana jina malê, pîrek, xêzan an xanim bi kar tînin. Lê gelo ev gotin ji ku tê ? Ji peyva **Keybanû** , ango jina **key** (qiral, şah) tê. Mana gotinê qiraliçe, şahbanû, melîke (tirkî: *kraliçe*, fransizî: *reine*, îngilîzî: *queen*) ye. Pêşiyên me **ciwanmêr** (tirkî: *centlmen*, fransizî: *gentilhomme*, îngilîzî: *gentleman*) bûne, bi gotinê be jî, qedrê jin û xatûnên xwe zanibûne.

## BIJÎ AN AFERÎN

Kîjan rastir e ? Her du jî. Aferîn ji **afirandinê** (xulq kirin, jiyandan) tê û xwerû kurdî ye, di farisî û zimanên îranî de teşeyên nêzîk ên vê gotinê hene. Jê **afirandî** (mexlûq, tirkî: *yaratık*, fransizî: *créature*, îngilîzî: *creature*) çêbûye. Mana aferîn bijî ye.

# NAVÊN ÎDARÎ

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| Dewlet | devlet | état | state |
| Hukûmet | hükümet | gouvernement | government |
| Serekkomar | cumhurbaşkanı | président de la république | president of republic |
| Serekdewlet | devletbaşkanı | chef d'état | head of state |
| Sermiyan | başkan | président | president |
| Serekwezîr | başbakan | premier ministre | prime minister |
| Komar | cumhuriyet | république | republic |
| Key, şah, qiral | kral, şah | roi | king |
| Şahitî, keyîtî, qirali | şahlık, krallık | royaume, royauté | kingdom, kingship |
| Keyperest, şahperest | monarşist | royaliste, monarchiste | monarchist |
| Paytext | başşehir, başkent | capitale | capital |
| Wezaret, wezaretxane | bakanlık | ministère | ministry |
| Wezîr | bakan | ministre | minister, secretary |
| Wezareta dadiyê | adalet bakanlığı | ministère de la justice | ministry of justice |
| Wezareta karên derve | dışişleri bakanlığı | ministère des affaires étrangères | ministry of foreign affairs |
| Wezirê derve | dışişleri bakanı | ministre des affaires étrangères | foreign mininter |
| Wezareta karên civakî | sosyal işler bakanlığı | ministère des affaires sociales | ministry of social  affairs |
| Civakî, sosyal | toplumsal | social | social |
| Wezareta karên çandiniyê | tarım işleri bakanlığı | ministère de l'agriculture | ministry of agriculture |
| Çandin | tarım | agriculture | agriculture |
| Cotkar | çiftçi | agriculteur | farmer |
| Wezareta bazara kar | çalışma bakanlığı | ministère du travail | ministry of labour |
| Bazara kar | iş piyasası | marché du travail | labour market |
| Wezareta maliyê | maliye bakanlığı | ministère des finances | ministry of finance |
| Sivîl | sivil | civile | civilian |
| Mal, xanî | ev, mesken | maison, logement | house, accomodation |
| Wezareta hawirparêziyê | çevre bakanlığı | ministère de l'environement | ministry of environemnt |
| Wezareta enerjiyê | enerji bakanlığı | ministère de l'énergie | ministry of energy |
| Hawîr, hawir | çevre | environement | environement |
| Wezareta bazirganiya derve | dış ticaret bakanlığı | ministère du commerce extérieur | ministry of foreign trade |
| Bazirganiya derve | dış ticaret | commerce extéhieur | foreign trade |

| | | | |
|---|---|---|---|
| Bazirganî | ticaret | commerce | trade |
| Bazirgan, têcir | tüccar | commerçant | trader, merchant |
| Wezareta aboriyê | ekonomi bakanlığı | ministère de l'économie | ministry of economy |
| Wezareta tendurustiyê | sağlık bakanlığı | ministère de la santé | ministry of health |
| Wezareta zanistî û teknolojiyê | bilim ve teknoloji bakanlıgı | ministère des sciences et de techonologie | ministry of sciences and techology |
| Wezareta budcê | bütçe bakanlığı | ministère du budget | ministry of budget |
| Wezareta tûrîzmê | turizm bakanlığı | ministère du tourisme | ministry of tourisme |
| Wezareta sporê | spor bakanlığı | ministère des sports | ministry of sports |
| Neteweyên Yekbûyî | Birleşmiş Milletler | Nations-Unies | United-Nations |
| Parlement | parlamento | parlement | parliament |
| Wezareta karên hundir | içişleri bakanlığı | ministère de l'interieur | ministry of domestic affairs |
| Wezareta şer | savaş bakanlığı | ministère de la guerre | ministry of war |
| Wezareta çandê | kültür bakanlığı | ministère de la culture | ministry of culture |
| Çandî | kültürel | culturel | cultural |
| Xwenda | okumuş | lettré, instruit | educated |
| Welat | ülke | pays | country |
| Navçe | bölge | région | area, region |
| Hêl, alî, rex, la | yer | côté | side |
| Dever, cîgeh | lokal | endroit, lieu, place | place |
| Cî, şûn, der | yer | lieu, place | place |
| Herêm | distrikt | district, secteur | district |
| Bajar, şehr | şehir | ville, cité | city, town |
| Tax | mahalle | quartier | quarter |
| Bajarok | küçük şehir, kasaba | bourg, bourgade | staggling village, small town |
| Gund, dêh | köy | village | village |
| Wîlayet | il | département, préfecture | department, province |
| Belediye, şaredarî | belediye | mairie | city hall, mayoralty |
| Şaredar, serekbelediye | belediye başkanı | maire | mayor |
| Bajaravahî | şehircilik | urbanisme | town planing |
| Walî | vali | préfêt | prefect, governor |

# NAVGÎNÊN NEQLIYÊ

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| trên | tren | train | train |
| balafir, firinde | uçak | avion | airplane, aircraft |
| otomobil | otomobil | automobile | motor car |
| otobus | otobüs | autobus | bus |
| minîbus | minibüs | minibus | minibus |
| kamyon | kamyon | camion | lorry, truck |
| kamyonet | kamyonet | camionette | van |
| traktor | traktör | tracteur | tractor |
| cîp | jip | jeep | jeep |
| pîkap | pikab | estafette | pick-up |
| bisîklet, duçerxe | bisiklet | bicyclette | bicycle |
| motorsîklet | motosiklet | motocyclette | bike |
| sêçerxe | | tricycle | tricycle |
| parxêl | at arabası, kağnı | char à bœufs | oxcart |
| helikopter | helikopter | hélicoptère | helicopter |
| taksî | taksi | taxi | taxi |
| mototren | mototren | train diesel | motor train |

hejmar 3 havîn 1988

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## CIVÎNA BRUKSELÊ

Civîna biharê ya li ser pirsên rastnivîsîn û nûkirina kurmancî di rojên 17 - 23ê nîsanê 1988an de li bajarê Brukselê, paytexta Beljîkayê, çê bû.

Ji nivîskar, rojnamevan, ronakbîr û zimannasên kurd ên dervayî welêt ên ku hatibûn vê Civînê ev in : Khosrow ABDOLLAHÎ (Selmas), Moayed AHMED (Behdînan), Kazim BABA (Dêrsim), Lutfî BAKSÎ (Batman), Rojen BARNAS (Diyarbekir), Egîd DIJWAR (Bişêrî), Evdo (nûçegihanê Kurdistan Press), Derwêş FERHO (Mêrdîn), D. ÎZOLÎ (Dêrsim), Mûsa KAVAL (Hekarî), K. NEZAN (Diyarbekir), Hiner SALIM (Behdînan), Şahîn B. SOREKLÎ (Koban), Yücel YEŞİLGÖZ (Dêrsim), Memo YETKÎN (Semsûr) û Reşo ZÎLAN.

Ji vê lîstê dixuye ku di civîna biharê de ji bakur ta başûr, ji rohelat ta rojavayê navçeyên kurmancîaxêvên Kurdistanê beşdar hebûn. Giraniya bernameya civînê vêcarê li ser peyivnasiya (termînolojiya) rojnamevaniyê û ya anatomiyê bû. Sal bi sal hejmara kovarên kurdî zêdetir dibe, hewcedariya bi peyvên kurdî ji bo behskirina bûyer û qewimandinên rojane jî li wê gorê hingî diçe xwe xurtir nîşan dide. Di Civîne de li ser hin ji van peyvên bingehîn hate axaftin, hinên din, ku bêtir lê fikirîn û xebat dixwazin, man civîna payizê. Heçî anatomiyê, xebatên civînê dan xuyakirin ku zimanê me di vî warî de gelekî dewlemend e ; ji bo hin parçeyên laşê mirov di şûna navekî de çend nav hene. Lê herwekî ev nav di xwendegahan de nayên hîn kirin, hin Kurd, nemaze bajarî, baş nizanin bi rastî kîjan nav ji bo kîjan parçeyê laş e. Lewra em van navan li ser wêneyên zanistî yên anatomiya mirov bi cîh dikin, ta ku xeletî, tevlihevî û şaşbikaranîn kêmtir bibin. Xebata li ser anatomiyê ewê di civînên ku tên de jî dom bike.

Wekî her car, di bernameya Civîna Brukselê de jî, hin pirsên jiyana rojane hebûn. Îca, beşdar li ser navên biharatan û ên navgînên deryayî xebitîn. Ew wisa jî vegeriyan ser hin navên îdarî û siyasî ku di civîna berê de zelal nebûbûn.

Bernameyên civînan şeş meh berê tên kifş kirin. Komele, kovar an komikên kurd ên ku dixwazin hin pirsên taybetî pêşniyarî van civînan bikin, divê ku di wextê de daxwaziyên xwe bi name ji Enstîtuyê re binivîsin. Stûnên *Kurmancî* ji rexne û pêşniyarên xwendevan re vekirî ne.

Amanc û merema me ew e ku bi hevkariya Kurdên ku bi zimanê xwe dizanin û jê hiz dikin kurmanciya nivîskî têkûz, ahengdar, bi mantiq, zelal û spehîtir be.

KURMANCÎ

# ANATOMIYA MIROV




| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **1- 18 SERÎ** | **BAŞ** | **TÊTE** | **HEAD** |
| 1 - Tasa serî, tepika serî, tepa serî, qoq | kafa tası, kafa tası zirvesi | crâne, sommet du crâne | crown of the head, top of the head |
| 2- patik | artkafa | occiput | back of the head |
| 3- por | saç | chevelure | hair |
| **4-17 RÛ** | **YÜZ** | **FACE** | **FACE** |
| 4-5- enî | alın | front | forehead |
| 4- pêşcênîk, beşik | alın çıkıntısı | bosse frontale | frontal eminence |
| 5- navçav | iki kaş arası, belce | glabelle | supercilliary arch |
| 6- cênîk | şakak | tempe | temple |
| 7- çav | göz | œil | eye |
| 8- hinarik | elmacık | pommette | cheekbone |
| 9- dêm, lam, rû | yanak | joue | cheek |
| 10- poz, difin, kepû, lût, bêvil | burun | nez | nose |
| 11- bêrûmet | | sillon naso-génénien | nasolabial fold |
| 12- | | sillon sous-nasal | philtrum |
| 13- dev | ağız | bouche | mouth |
| 14- kujê lêvê | dudakların birleşme yeri | commissure des lèvres | labial commissure |
| 15- çene, erzîng | çene | menton | chin |
| 16- çenegeh | çene çukurcuğu | fossette mentonnière | dimple in the chin |
| 17- çelefik, çen, alçen | üstçene | mâchoire inférieure | jaw |
| 18- guh | kulak | oreille | ear |
| **19-21- STÛ** | **BOYUN** | **COU** | **NECK** |
| 19- qirik | boğaz | gorge | throat |
| 20- çala gerdenê | | fossette sous-sternal | hollow of the throat |
| 21- çema stû | ense | nuque | nape of the neck |

# Anatomiya Serî

| **30-41 QERQÛDE, SKELET** | **ÎSKELET** | **SQUELETTE** | **SKELETON** |
|---|---|---|---|
| kilox | kafatası | crâne | skull |
| 30- textikê eniyê, hestiyê eniyê | alın kemiği | frontal | frontal bone |
| 31- tasa serî | çeber kemiği | pariétal | parietal bone |
| nîve tasa rastê | sağ yan kafa kemiği | pariétal droite | right parietal bone |
| nîve tasa çepê | sol yan kafa kemiği | pariétal gauche | left parietal bone |
| 32- hestiyê patikê | arkakafa kemiği | occiput | occipital bone |
| 33- hestiyê beleguhê | yankafa kemiği | temporal | temporal bone |
| 34- kerrika guh | kulak yolu | conduit auditif | external auditory canal |
| 35- hestiyê çena jêrîn | altçene kemiği | maxillaire inférieur | lower jaw bone |
| 36- hestiyê çena jorîn | üst çene kemiği | maxillaire supérieur | upper jaw bone |
| 37- hestiyê hinarikê | elmacık kemiği | os malaire | cheekbone |
| 38- hestiyê cênîkê | şakak kemiği | sphénoide | sphenoid bone |
| 39- hestiyê kortika çav | göz çukuru kemiği | ethmoide | ethmoid |
| 40- hestiyê kaniya çav | göz pınarı kemiği | unguis, os lacrymal | lachrymal bone |
| 41- hestiyên poz, difin, kepû, lût, bêvil | burun kemikleri | os nasaux | nasal bones |

| **42-55 SERÎ** | **BAŞ** | **TÊTE** | **HEAD** |
|---|---|---|---|
| 42- mêjî | beyin | cervau | cerebrum, great brain |
| 43- hîpofiz | hipofiz | hypophyse | hypophysis |
| 44- corpus callosum | nasırlı cisim | corps calleux | callous corps |
| 45- mêjîkok | beyincik | cervelet | little brain |
| 46- pirika mêjî | Varoli köprüsü | pont de Varole | pons cerebri |
| 47- pîvazoka mêjî | soğancık | bulbe | brain-stem |
| 48- mêjiyê piştê | omurilik | moëlle épinière | spinal cord |
| 49- sorsorik, kirkirok | yemek borusu | oesophage | gullet, oesophagus |
| 50- zengilor | soluk borusu | trachée | trachea, windpipe |
| 51- zimanê kirkirokê/zengilorê | gırtlak kapağı | épiglotte | epiglottis |
| 52- ziman | dil | langue | tongue |
| 53- valahiya poz, difin, bêvil, kepû, lût | burun boşluğu | fosse nasale | nasal cavity |
| 54- sînûsa cênîkê | şakak sinüsü | sinus sphénoide | sphenoidal sinus |
| 55- sînûsa eniyê | alın sinüsü | sinus frontal | frontal sinus |







**56-65 ORGANÊ BIHÎSTINÊ**

| **GUH** | **KULAK** | **OREILLE** | **EAR** |
|---|---|---|---|
| 56- 58 guhê derva | dış kulak | oreille externe | external ear |
| 56- kevçika guh | dış kulak kepçesi | pavillon | auricle |
| 57- nermika guh, gurçika guh | kulak memesi | lobe | ear lobe |
| 58- kerrika guh | kulak yolu | conduit auditif | external auditory canal |
| 59-61 guhê navîn | orta kulak | oreille moyenne | middle ear |
| 59- perdeya guh | kulak zarı | tympan | tympanic membrane |
| 60- valahiya guhê navîn | orta kulak boşluğu | caisse du tympan | typmanic cavity |
| 61- hestîkên bihîstinê, çakûç, sindan, zengû | orta kulak kemikleri, çekiç, örs, üzengi | osselets de l'oreille, marteau, enclume, étrier | ossicles, hammer, anvil, stirrup |
| 62-64- guhê hundirîn | iç kulak | oreille interne | internal ear |
| 62- labîrent | labirent | labyrinthe | labyrinth |
| 63- şeytanok | salyangoz | limaçon | cochlea |
| 64- rehê bihîstinê | işitme siniri | nerf auditif | auditory nerve |
| 65- boriya Ostakî | Ostaki borusu | trompe d'Eustache | Eustachian tube |
| | çimika guh | tragus | tragus |
| | kevîya guh | anthélix | anthelix |
| | serçimika guhsarmal | hélix | helix |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **14-37 DEV û GEWRÎ** | ağız ve boğaz | la bouche et le pharynx | mouth and throat |
| 14- **lêva jorîn** | üst dudak | lèvre supérieure | upper lip |
| 15- **pidî** | diş eti | gencive | gum |
| **16-18 DIRAN an DIDAN** | **DİŞ** | **DENT** | **TEETH** |
| 16- **diranên pêşîn, diranên befşik** | kesici dişler | incisives | incisors |
| 17- **diranên tûj, qîl** | köpek dişleri | canines | canine tooth |
| 18- **diranen kursî, diranên paşî** | azı dişler | molaires | premolars |
| 19- **kujêdev** | dudakların birleşme yeri | commissurre des lèvres | labial commisure |
| 20- **esmanê dev, panîka dev, kama dev** | damak | palais | hard palate |
| 21- **nermika esmanê dev** | yumuşak damak | voile du palais | soft plate velum |
| 22- **zimanê biçûk, zimanok** | küçük dil | luette | uvula |
| 23- **behîvok, aloq, gelale** | bademcik | amygdale | tonsil |
| 24- **gewrî, hefik** | boğaz | pharynx | pharynx |
| 25- **ziman** | dil | langue | tongue |
| 26- **lêva jêrîn** | alt dudak | lèvre inférieure | lower lip |
| 27- **çena jorîn** | üst çene | mâchoire supérieure | upper jaw |
| **28-37 DIRAN** | **DİŞ** | **DENT** | **TEETH** |
| 28- **kîsikê diran** | dişkökü zarı | coiffe de la racine | periodontal membrane |
| 29- **hesteyê diran** | diş çimentosu | cément | dental cementum |
| 30- **sedefa diran** | emaye | émail | enamel |
| 31- **aca diran** | fildişi kısma | ivoire | dentine |
| 32- **pûka diran** | iç/orta tabaka | pulpe denttaire | dental pulp |
| 33- **reh û damarên diran** | diş sinir ve damarları | nerfs et vaisseaux sanguins | nerves and blood vessels |
| 34- **befşik** | kesici diş | incisive | incisor |
| 35- **diranê kursi** | azı diş | molaire | molar |
| 36- **koka diran** | diş kökü | racine | root |
| 37- **taca diran** | diş tacı | couronne | crown |
| **kepîr** | kîreç | tartre | tartar |
| **kepîr girtin** | kireç tutmak | s'entarter | to fur up |













| **38-51 ÇAV** | **GÖZ** | **ŒIL** | **EYE** |
|---|---|---|---|
| 38- birî | kaş | sourcil | eyebrow |
| 39- palikê çavê jorîn | üst göz kapağı | paupière supérieure | upper eyelid |
| 40-palikê çavê jêrîn | alt göz kapağı | paupière inférieure | lower eyelid |
| 41- bijang | kirpik | cil | eyelash |
| 42- reşika çav, iris | iris | iris | iris |
| 43- bîbik | göz bebeği | pupille | pupil |
| 44- masûlkeyên çav | göz kasları | muscles occulomoteurs | occular muscles |
| 45- gûza çav | göz yuvarlağı, göz küresi | globe oculaire | eyeball |
| 46- spîka çav | göz akı | corps vitré | vitrous body |
| 47- perdeya çav, gilêne | saydam tabaka | cornée | cornea |
| 48- nîske | göz merceği | cristallin | lens |
| 49- tora çav, retîna | ağ tabaka | rétine | retina |
| 50- piniya kor | kör nokta | papille | blind spot |
| 51- reha bînahiyê | görme siniri | nerf optique | optic nerve |

# Navê navgînên deryayê

*Amadekar*: Mûsa KAVAL

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| navgîn | araç | véhicule, moyen de transport | means, vehicle |
| derya | deniz | mer | sea |
| deryayî | denizsel | marin,e | sea, adj. |
| deryavan | denizci | marin, navigateur | seaman, navigator |
| deryavanî | denizcilik | navigation | navigation |
| keştîvan | gemici | marin, matelot | sailor, seaman |
| keştîvanî | gemicilik | marine | navy |
| bixêrî | baca | cheminée | chimney |
| bêrik | kürek | rame | oar |
| keştî | gemi | navire, bateau | ship, boat |
| xêlî | yelken | voile | sail |
| keştiya bi bêrik | kürekli gemi | navire à rames | noving boat |
| keştiya bayî | yelkenli gemi | bateau à voile | sailing boat |
| keştiya dûkelî, vapor | buharlı gemi | bateau à vapeur | steamer, steam ship |
| keştiya bi motor | motorlu gemi | bateau à moteur | motorboat |
| keştiya bi enerjiya nuklêrî | nükleer güdümlü gemi | navire à propulsion nucléaire | nuclear-powered ship |
| cenkeştî | savaş gemisi | navire de guerre | warship |
| keştiya barkêş | yük gemisi | navire de transport | transport ship |
| keştiya nexweşxane | hastahane gemisi | navire-hôpital | hospital-ship |
| keştiya xwendegeh | okul gemisi | bateau-école | training ship |
| keştiya masîgiriyê, masîvaniyê | balıkçı gemisi | chalutier, bateau de péche | trawler |
| keştiya rêberiyê | kılavuz gemisi | bateau-pilote | pilot boat |
| keştiya hawarê | cankurtaran gemisi | bateau de sauvetage | lifeboat |
| keştiya agirkujiyê | itfaiye gemisi | bateau-pompe | fireboat |
| keştiya geştê | eğlence gemisi | bateau de plaisance | pleasure boat |
| keştiya petrolkêş | petrol gemisi | pétrolier | tanker |
| balafirhilgir | uçak gemisi | porte-avion | aircraft carrier |
| stol | filo | flotte | fleet |
| keştiya rêwiyan | yolcu gemisi | paquebot | liner |
| qeyik | kayık | barque | small boat |
| mayinçîn | mayın döşeme gemisi | mouilleur de mines | minelayer |
| mayingir | mayın tarama gemisi | dragueur de mines | minesweeper |
| lezbot | sürat motoru, devriye motoru | vedette | launch, patrolboat |
| ferîbot | feribot | ferry-boat | ferry-boat |
| qeyika hawarê | cankurtaran kayığı | canot de sauvetage | lifeboat |
| noqav | denizaltı | sous-marin | submarine |
| kelek | sal | radeau | timber float |
| kod | küçük tekne | canot | small or open boat |
| lengergeh | iskele | échelle, embarcadère | landing stage |
| lenger | çapa demiri | ancre | anchor |
| bender | liman | port | port, harbour |
| sekûya benderê | rıhtım | quai | quay, embankment |
| fanosa deryayî | deniz feneri | phare | light house, beacon |
| lenger avêtin | demirlemek | jeter l'ancre | cast anchor, drop anchor |
| lenger hildan | demir almak | lever l'ancre | weigh anchor |
| keştiya hawarê | cankurtaran | bateau de sauvetage | lifeboat |

# Biharat

*Amadekar*: Reşo ZÎLAN

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* | *latînî* |
|---|---|---|---|---|
| biharat | baharat | epices | spices | |
| rizyane, cehcehik | rezene | fenouil | common fennel | foeniculum vulgare |
| anix, anîs | anason | anis | anise | pimpinella anisum |
| zîre, kîmyon | kimyon | cumin | cumin | carum carvi |
| bîbera reş, îsota reş | karabiber | poivre noir | black pepper | piper nigrum |
| bibera spî, îsota spî | beyaz biber | poivre blanc | white pepper | piper albium |
| germok | | poivre de la Jamaique | Jamaican pepper | pimenta officinalis |
| pûng | yarpuz | menthe sauvage | wild mint | mentha silvaticus |
| nane | nane | menthe poivrée | peppermint | mentha piperita |
| bîberiye | biberiye | romarin | rosemary | rosmarinis officialinus |
| zaferan | safran | safran | saffron | crocus stavius |
| gijnîj | kişniş | coriandre | coriander | coriandrum sativum |
| xaşxaşk | haşhaş | pavot | poppy | papaver |
| defne | defne | laurier | laurel | laurus nobilus |
| hêl | kakule | cardamome | cardamom | elettaria cardamomum |
| zencefîl | zencefil | gingembre | ginger | zingiber officinal |

| | | | | |
|---|---|---|---|---|
| darçîn | tarçın | cannelle | cinnamon | cinnamomum ceylanicum |
| mêxik | karanfil | clou de girofle | clove | eugenia caryophyllata |
| vanîl | vanilya | vanille | vanilla | vanilla planifolia |
| reşreşk, hefsûdank | çörek otu | carvi, cumin des prés | caraway seeds | nigella sativa |
| simaq | sımak | sumac | sumac | rhus cotinus |
| rihan | reyhan, fesleğen | basilic | basil | ocimum basilicum |
| catir, cehtirî | mercankök | origan, marjolaine | origan | origanum vulgare |
| tarxûn | tarhûn | estragon | tarragon | artemisia dracunculus |
| kurî | kuri | curry | curry | |
| riha zer, koka zer | hint safranı | curcuma, safran des Indes | curcuma | |
| pîjinda, şiwît | dere otu | aneth | aneth | anethum |
| tovxerdel | hardal | moutarde | mustard | |
| kuncî | susam | sésame | sesame | |
| zererek | keten | lin | flax | |
| îsota Kayenê | Kayen biberi | poivre de Cayenne | Cayenne pepper | |
| xweya lîmonê, lîmondûz | limontozu | acide citrique | citric acid | |
| bîbera sor | kırmızı biber | paprika | paprika | |

# Termên siyasî û îdarî

| ***kurdî*** | ***tirkî*** | ***fransizî*** | ***îngilîzî*** |
|---|---|---|---|
| komar | cumhuriyet | république | republic |
| komarî | cumhuriyetçi | républicain, e | republican |
| sîstema komarî | cumhuriyetçi sistem | système républicain | republican system |
| komarxwaz | cumhuriyet taraftarı | républicain, partisan de la république | republican, who is in favor of republic |
| komarparêz | cumhuriyet savunucusu | défenseur de la république | defender of republic |
| komarperest | koyu cumhuriyetçi | républicain fanatique | fanatic republican |
| serbajar | başşehir, başkent | capitale | capital |
| berbajar | banliyö | banlieu | suburbs, outskirts |
| bergir | savunucu | défenseur | defender |
| bergirî | savunma | défense | defence |
| wezareta bergiriyê | savunma bakanlığı | ministère de la défense | ministy of defence |
| dadmend | adil | juste, équitable | just, fair |
| dadmendî | adalet | justice, équité | justice, fairness |
| wezareta dadmendiyê | adalet bakanlığı | ministère de la justice | ministry of justice |
| guhastin (biguhêze !), l. | ulaştırmak, nakletmek | transporter | to transport, to carry, to move |
| guhastin, *n.m.* | ulaştırma, nakliye | transport | transportation |
| wezareta guhastinê | ulaştırma bakanlığı | ministère des transports | ministry of transportation |
| hîn bûn, fêr bûn, l. | öğrenmek | apprendre | to learn |
| hîn kirin, fêr kirin | öğretmek | enseigner, instruire | to teach |
| hînbûn, fêrbûn , n.m. | öğrenme | apprentissage | learning |
| hînkirin, fêrkirin, n.m. | öğretim, talim | instruction | teaching, training, instruction |
| hevotin (bihêvoje !), l. | eğitmek, terbiye etmek | éduquer, apprivoiser | to educate, to tame |
| hevotin, *n.m.* | eğitim | éducation | education |
| hînkirin û hevotin | talim ve terbiye | instruction et éducation | teaching and education |
| wezareta hevotina neteweyî | milli eğitim bakanlığı | ministère de l'éducation nationale | ministry of national education |
| nehevijî | terbiyesiz | inéduqué | uneducated |
| gihandin(bighîne !), l. | yetiştirmek | former | to train |
| gihandin, *n.m.* | yetiştirme | formation | training |
| ragihandin, (ragihîne!), 1 | iletişim | communication, transmission | communication, transmission |
| ragihandin, (ragihîne !), l. | iletmek | communiquer, transmettre | to communicate, to transmit |
| tele-ragihandin *n.m.* | tele-iletişim | télé-comunication | tele-communication |
| navginên ragihandinê | iletişim araçları | moyens de communication | means of communication |

| | | | |
|---|---|---|---|
| civat | meclis, toplum | assemblée, société | assembly, society |
| civatkîan civakî | toplumsal, sosyal | social, e | social |
| civataşaredariyê | belediye meclisi | conseil municipal | town council |
| encumen | encümen | commission, comité | committee, commission |
| encumena şaredariyê | belediye encümeni | comité exécutif municipal | town council executive |
| tax | mahalle | quartier | quarter |
| awartin(biawêre!), l. | istisna etmek | excepter | to except |
| awarte | istisnaî | exceptionnel | exceptional |
| rewşaawarte | istisnaî durum | état d'exception | state of exception |
| birandin (bibirîne !), l. | yok etmek | exterminer | to exterminate |
| birandin, *n.m.* | yoketme | extermination | extermination |
| nijadkujî | soykırım | génocide | genocide |
| qir, qirkirin | katliam | massacre | massacre, slaughter |
| hinare | mesaj | message | message |
| hinartî, şandî, peyk | elçi | envoyé, messager | messenger |
| darayî,maliye | maliye | finance | finance |
| wezareta darayiyê, maliyê | maliye bakanlığı | ministère des finances | minstry of finance |
| endustrî | endüstri | industrie | industry |
| wezareta endustriyê | endüstri bakanlığı | minstère de l'industrie | minstry of industry |
| balyoz, sefîr | büyük elçi | ambassadeur | ambassador |
| balyozxane | elçilik | ambassade | embassy |
| konsul | konsolos | consul | consul |
| konsulxane | konsolosluk | consulat | consulate |
| ataşe | ataşe | attaché | attaché |
| pispor | uzman, bilirkişi | expert | expert |
| desthilat | otorite | autorité | authority |
| karîn, şiyan | iktidar, kudret | pouvoir | power |
| dengdan | oylama | vote | vote |
| hilbijartin | seçim | élection | election |
| hilbijêr | seçmen | électeur | elector, voter |
| hilbijartî | seçilmiş | élu | elected |
| bijare | seçkin | distingué | distinguished |
| namzed | aday | candidat | candidate, applicant |
| bernamzed | aday adayı | candidat à la canditature | candidate for candidacy |
| statu | statü | statut | status |
| referandum | referandum | référendum | referendum |

# Rastnivîsîna lêkera *BÛN*ê

| | | |
|---|---|---|
| Ez | im | me |
| Tu | (y) î | yî |
| Ew | e | ye |
| Em | in | ne |
| Hun | in | ne |
| Ew | in | ne |

Mînak:

| | | |
|---|---|---|
| Ez | kurd | im |
| Tu | kurd | î |
| Ew | kurd | e |
| Em | kurd | in |
| Hun | kurd | in |
| Ew | kurd | in |

| | | | |
|---|---|---|---|
| Lê | Ez | gundî | me |
| | Tu | gundî | yî |
| | Ew | gundî | ye |
| | Em | gundî | ne |
| | Hun | gundî | ne |
| | Ew | gundî | ne |

Lêkera **bûn**ê mana rewş guhartinê (fransizî : *devenir*, îngilîzî, *to become*) jî dibe û hingê wekî jêrîn tê bi kar anîn :

| | |
|---|---|
| Ez | dibim |
| Tu | dibî |
| Ew | dibe |
| Em | dibin |
| Hun | dibin |
| Ew | dibin |

# TERMÊN ROJNAMEVANIYÊ

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| rojname | gazete | journal | newspaper |
| rojnamevan | gazeteci | journaliste | journalist |
| rojnamevanî | gazetecilik | journalisme | journalism |
| kovar | dergi | revue | journal, review |
| kovara hefteyî | haftalık dergi | revue hebdo-madaire, | weekly hebdomadaire |
| kovara mehane, mehname | aylık dergi | revue mensuelle, mensuel | monthly |
| kovara sêmehî | üç aylık dergi | revue trimestrielle | quarterly |
| kovara salane, salname | yıllık dergi | revue annuelle | annual journal |
| kovara nîvmehî | 15 günlük gazete | revue bimensuelle, bimensuel | bimonthly, fortnightly |
| redaktor | redaktör | rédacteur | redactor |
| nûçegihan | muhabir | correspondant | correspondent |
| nivîs | yazı | écrit | writing, written work |
| nivîsar | yazı, metin | écrit, texte | text |
| bend | makale | article | article, paper |
| nivîser | okur-yazar | alphabète, qui sait lire et ecrire | literate |
| nivîskar, nivîsevan | yazar | écrivain | writer |
| nivîsandin | yazı, yazmak | écriture, écrire | writing, to write |
| nûçe | haber | nouvelle | news |
| berpirsiyar | sorumlu | responsable | responsible |
| berpirsiyarî | sorumluluk | responsabilité | responsibility |
| nivîskî | yazılı | écrit, par écrit | written, in writing |
| nivîsyar | katip | scribe, secrétaire | secretary, scribe |
| nivîsgeh | yazı odası | bureau | office |
| nivîsxane | yazı kalemi | secrétariat, bureau des dactylos | typing pool, writing section |
| destnivîs | elyazması | manuscrit | manuscript |
| destxet | elyazısı | écriture | handwriting |
| rastnivîsîn | imla kuralları | orthographe | orthography |
| sernivîs | başlık | titre | title |
| sernivîsar | başyazı, başmakale | éditorial | editorial, leading rticle |
| sernivîskar | başyazar | éditorialiste | editorial writer |
| roportaj | röportaj | reportage | report |
| karîkator | karikatür | caricature | cartoon |
| karîkatorîst | karikatürist | caricaturiste | cartooniste |
| foto | fotograf | photo, photograph | photo, photographie |
| fotokêş | fotoğrafçı | photographe | photographer |
| wêne | her türlü resim | image, peinture | image, painting |
| çîn, neqş | resim | dessin | drawing |
| neqişkêş | desinatör | dessinateur | drawer |
| sernûçe, manşet | manşet | manchette | headline |
| kiriyar, abone | abone | abonné | subscriber |
| kiriyarî, aboneyî | abonman | abonnement | subscription |
| çapemenî | basın | presse | press |
| çap | basım, baskı | impression | printing |
| weşan | yayın | publication | publishing |
| çapxane | matbaa | imprimerie | printing house |
| weşanxane | yayınevi | maison d'édition | publishing bouse |
| pirtûk | kitap | livre | book |
| namilke | broşür | brochure, opuscule | brochure, booklet |
| bulten | bülten | bulletin | bulletin |
| belavok | bildiri | tract | tract |
| rêze | dizi | série | series |
| rêze-film | dizi film | feuilleton, films à épisodes | serial |
| wêneçîrok | çizgi roman | bande dessinée | strip cartoon |
| fotoroman | fotoroman | roman-photo | romantic picture story |
| çîrok | hikaye, masal | histoire, conte | story, tale |
| çîn, neqş | işleme, desen | dessin, motif | motif, pattern |
| çînîn | işlemek, nakşetmek | graver, dessiner | to engrave, to imprint, to draw |
| veçinîn, hevrês kirin | dokuma sök-üğünü örmek, örerek, yapmak | repriser | to darn, to mend, to strich up |
| hilçinîn | sarmak, masura sarmak | embobiner, enrouler | to wind up, to roll up |

## GIYAYÊN DERMANAN

Va ne navên çend giyayên ku di hekimiya kurmancî de bi kar tînin. Gelo hun mana wan bi tu zimanên din dizanin ? Heke bi eseyî dizanibin kerem kin ji *Kurmancî* re binvîsin.

- **Meyremxurt**
- **Tirşok**
- **Qahfûr**
- **Pelewêsk**
- **Gûlik**
- **Karî**
- **Gûriz**
- **Nûsek**
- **Doçbizin**
- **Hîro**

hejmar 4 zivistan 1989

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## Termên rojname û rojnamevaniyê

| *kurdî* | *tirkî* | *fransızî* | *ingilîzî* |
|---|---|---|---|
| helbest, şi'r | şiir | poème | poem |
| kuncnivîsar, quncnivîsar*1 | köşe yazısı | billet, rubrique | column |
| kuncnivîs, quncnivîs | köşe yazarı | billetiste | columnist |
| rêzenivîsar | seri yazı, dizi yazı | feuilleton | series |
| stûn | sütun | colonne | column |
| rêz | satır | ligne | line |
| tîprêzî | dizgi | typographie | typography |
| tîprêz | dizgici, tipograf | typographe | typographer |
| çap | baskı, basım | impression | printing |
| çap kirin | basmak | imprimer | to print |
| çapxane | basımevi | imprimerie | printing house |
| xwendevan | okuyucu | lecteur | reader |
| belavkirin | dağıtım | distribution | circulation |
| belavker | dağıtımcı | distributeur | distributor |
| weşanxane | yayınevi | maison d'édition | publishing house |
| weşandin | yayınlamak | éditer, publier | to publish |
| pritûkfiroş | kitabçı | libraire | bookseller |
| pirtûkfiroşî | kitabçılık, kitapçı dükkanı | librairie, métier de libraire | bookshop, booksellership |
| heyber, mijar, babet | konu, mevzu | sujet, matière | subject |
| têm | tem, tema | thème | theme |
| naverok | içerik, muhteva | contenu | content |
| fihrist*2 | indeks, fihrist | index | index |
| berg | kapak | couverture | cover |
| kiras | şömiz, karton kaplama gömleği | chemise | jacket |
| nimînende, niwêner*3 | temsilci | représentant | representative |
| nimandin, niwênandin | temsil etmek*4 | montrer, représenter | to show, to represent |
| nimûne | ömek, misal | exemple, échantillon | example, sample |
| arîkar, alîkar | yardımcı, muavin | assistant | aid, assistant |
| rûpel raxistin | sayfa düzenlemek | mettre en page | to make up, to lay-out |
| rûpelraxer | sayfa düzenleyici | metteur en page | page maker, compositor |
| rûpelraxerî | sayfa düzenleyicilik | métier de metteur en page | compositorships |

**1. kuncnivîsar, quncnivîsar: ji ber ku li hin deverên Kurdistanê* **kunc** *(kuncik) û li hin deverên dinê* **qunc** *tê bi kar anîn û Kurmancên ku* **kunc** *bi kar tînin ji* **qunc** *tê nagihîjin, herwekî yên* **qunc** *bi kar tînin ji ya dinê fêm nakin, me di pêşneyara herdiwan de jî fayde dît.*
**2. fihrist, pêrist:* **fihrist** *gotineke farisî ya kevin e. Ev gotin di hin ferhengên bi kurdî yên kevin de* **fihrist** *û di hinan de jî* **pêrist** *derbas dibe ku di nav Kurdên rojhelat (Îran) û yên başûr (Iraq) de ya dawî bêtir belavbûyî ye.*
**3. nimînende, niwêner:* **nimînende** *di nav metnên kurmancî de û di* ***Hawar****ê de gelek hatiye bi kar anîn.* **Niwêner** *di nav kurmanciya xwarê (soranî-mukriyanî) de tê bi kar anîn ku ev* **niwêner** *bi awakî guhartî wekî* **nûner** *derbasî kurmanciya jorê biye û bi vî awayî ji aliyê hin kesan ve tê bi kar anîn.*
**4. Kurmancên ku* **nimandin** *bi kar tînin, piranî ji bo* **nîşan dan, şanî dan, raberkirin** *û hwd dibêjin. Lê me ew li vir di maneya di dereceya didu an de bi kar aniye.*

## Civîna Berlînê

Civîna payîza 1988an li Berlinê di roja 27 teşrîn 1988an de bi vekirina serekê Enstîtuya kurdî ya Parîsê, Kendal Nezan, dest pê kir. Serekê Enstîtuyê ji bo hevalên nûhatî yên vê civînê, behsa bingeh û awayên civînê kir û mazeretên hevalên vexwendî yên ku ji ber hin sedeman nikarîn beşdarî vê civînê bibin, pêşkêşî zanîna hevalên amadebûyî kir.

Di civînê de Khosrow Abdollahî (Selmas), Muzefer Begzade (∑ikakan), Mustafa Düzgün (Dersim), Xelîl Dihokî (Dihok), Huseyin Sado (Hesîçe), Reşo Zîlan, Mûsa Kaval (Hekarî), Rojen Barnas (Diyarbekir), S.Rêwing (Sêrt) û Derwêş Ferho (Mêrdîn) beşdar bûn.

Serektiya civînê, her weke berê, bi awayê ku bi dorê rojê yek bike, ji Reşo Zîlan dest pê kir.

Civîn, li gora bernameya xwe, li ser pirsên jêrîn xebitî: termên rojname û rojnamevaniyê, navên cihan, sîstema îdarî ya Îranê, kurmanciya Dîwana Melayê Cizîrî û ya Cigerxwîn û hin xalên gramerê (lêkerên hevedudanî).

Ewê civîna bihara 1989 giraniya xwe bide pirsa termînolojiya hiqûqî. Ji bo amadekirina van peyvên hiqûqî komek ji hiqûqnasên kurd hatiye pêk anîn û ewê di mehên pêşiya me de li ser vê pirsê bixebite.

KURMANCÎ

## FERHENGOKA
## Dîwana Melayê Cizîrî

*Amadekar* : Rojen BARNAS

Ev ferhengoka piçûk a ji Dîwana Melayê Cizîrî, perçekî ji rêzexebata berhevkirina gotinên kurdî ji klasîkên kurmanciya jorîn e.

Çerçewa vê xebatê berhevkirin û hilbijartina gotinen kurdî yên di nav nivîsarên klasîkan de mayî ne. Ev gotin ji aliyê hin kesan ve bêne zanîn jî mixabin ji aliyê piraniyê ve nayên zanîn; ew li hin herêman bêne bikaranîn jî li herêmên mayî yên welat hatine jibîrvekirinê. Yaxut hin ji van gotinan di nav axleb Kurdên Tirkîyê de wek gotinên tirkî têne zanîn.

Di berferehkirina zimanekî de riya belkî dijwar, lê ya esasî, berhevkirina gotinên eslî yên wî zimanî: 1) ji afirandinên wî yên klasîk; 2) ji folklora devkî û 3) li sahayê ji devê xelqê ye. Di pey de, ji bo hewcedariyên nû yên ziman, gehîneka "gotin çêkirinê" tê; ku gava meriv bi endaze û bi baldariyeke hûr û xurt hereket neke, dêlva kêr gihandinê wê ziyaneke giran bigihîne ziman, di ziman de bibe sedemê anarşiyeke mezin. Lewra beşa zimannasî ya Enstîtuyê

di civîna xwe ya pêşîn a Barselonayê de vê rêzexebatê wek xebateke bingehîn û berdewam pejirand û da ber xwe.

Ev ferhengoka berpêşî we kirî xeleka diduyan a vê rêzexebatê ye ku herwekî hun pê dizanin xeleka pêşîn ferhengoka Mewlûda Melayê Bateyî bû û ji aliyê mamosta Reşo Zîlan ve hatibû amade kirin. Xebata li ser Şêx Ehmedê Xanî, Cegerxwîn û klasîkên me yên dinê di çerçewa bernameya xebatê di dorê de ne.

Di berhevkirin û hilbijartina gotinên vê ferhengokê de min ji nusxeyên Dîwana Melayê Cizîrî , çapa ji aliyê mamosta Hejar ve amadekirî, esas girt. Lê wê bi çapa Misrê, bi ya Stokholmê (Zeynelabidîn Zinar û M.Emin Narozî pêk anîne) û bi hin xezelên dîsa bi alfaba kurdî-latînî ji wergerandina Qedrî Cemîl Paşa di Hawarê de muqayese kir.

Di xebata li ser maneyên gotinan berhema bingehîn çapa mamosta Hejar e. Di pey de xebata muşterek e ku ji aliyê beşdarên civîna Bruksel û Berlîlê kêmasî hatine rast kirin. Ji aliyê tesbîtkirina hatina orîjîna gotinan ji çavkaniyên jêrîn hatiye istîfade kirin:

1) Ansiklopedîk Lûgat Ferit Devellioğlu
2) Okyanus Ansiklopedik Sözlük, Pars Tuğlacı
3) Persian-English Dictionary, Steingass
4) Ferhengên kurdî û erebî/fransizî/rusî

Di *Dîwana Cizîrî* de ji bilî kurdî, gotinên ku bi selê xwe çînî, erebî, farisî, tirkî, yûnanî û hwd gelek in. Ji ber vî çendî di hilbijartin û tesbîta gotinên kurdî de civîn ihtîmameke gelek mezin nîşan daye şaşiyek piçûk çi ye, neyê kirin.

Di sêwirandina wê ferhengokê de min li gora pîvanên jêrîn gotinan hilbijart : a) Gotinên ku îro ji aliyê piraniyê ve nayên nasîn; b) Gotinên ji aliyê rastnivîsîn (îmla) an bilêvkirinê (telafuz) de têvel in; c) Gotinên ku ji roja Cizîrî heta niha neguhirîne wekî xwe mane.

Li hember maneya her gotinê, ji bo numûne dayinê, me malikek ji *Dîwanê* daniye da ku xwendevan bizanibe ev gotin li ku derê û bi çi awayî derbas dibe. Hin gotin hene ku li hember û di pey maneyê de *bnr.* dinivisîne ku maneya wê «binêre» li gotina di pey de bi tîpên reştirîn nivîsandî. Herwekî : «dav: dafik; *bnr.* li **bend**». Ku dixwazin ka gotina «dav» di kîjan malikê de derbas dibe, divê li gotina «**bend**» binêrin. Li ber wê gotinê malikek ji xezeleke Cizîrî heye ku gotina «**bend**» tê de hatiye bikaranîn.

Ev xebata pêşkêşkirî bi gotina rastî ne ferhengok e, lê ferhengoka ferhengokê ye. Ji bo ferhengokeke temamî divê hemû gotinên bikaranînî tê de hebin. ji bo biservebûna edebiyata klasîkî ev pêwist e, lê îro ne heliz e. Ji ferhengokeke kurdî ya *Dîwana* wî dîsa divê hemî gotinên kurdî yên ku wî bi kar anîne tê de hebin, lê ev jî xebateke ferehtir divê ku niha li dervayê mebesta çerçewa xebata me dimîne. Di çerçewa van herdiwan de ev ferhengoka pêşkêşkirî, ku gotin caîz be, têjika ferhengokê ye. lê hemî gotinên pêwist tê de hene, ji derva nemane.

Hêvîdar im ku bi kêrî têkilpêbiran were

Rojen BARNAS

## A

**aferîn**: bijî
"Rustem û Cemşîd û Xalid, Hemze ya şêrê Elî
**Aferîn** ya **şehsiwarê** turk û rimbazê ereb"

**al'al**: helale, lale
"**Sunbul** bi sema tên û gulan perde dirandin
Bişkiftine **al'al** û hişîn bûne terazin"

**amanc**: armanc
"Bendeyê sadiq seher **amancî** reştozê xwe kir
Min bi qewlê dijminan det ber xedengan bê sebeb"

**awaz**: deng, sewt
"Ney dûr e hebîbê me çi feryad û fixan kin
Wê guh li zemîra dil e **awaz** çi hacet?"

**ax**: erd, xwelî
"Ji **axa** asîtanê **mistekî** bîn
Li daxan da bibînim xweş seba tîz"

**azar:** êş, eziyet, sancî
"Ahî ji derdê dil dikit herçî ku dî **azarî** çerx
Derbê li nîva dil didit lami' sifet nûbarî çerx"

## B

**bac**: wêrgî
"**Cuhtê** Hebeşan bi turfet-ul- 'eyn
Anî qederek ji Espehan **bac**"

**bal**: nik, cem
"Li **bal** 'îlmê te me'lûm e ji jînê min tu meqsûd î
Fîdayê canê me dê can bit di qesda wesl û **dînê** da"

**balîn**: balîv, balgeh
"Da nale û ahên me ji dil seh bikirî
Wer guh bide **hindavî** serê **balînê**"

**ba Xoy**: bi Xwedê
"Bendeyê **ba Xoy** bivêt dê meylî sîm û zer **nekit**
Da 'etaya padişahan bê hed û ejmar bit"

**bazîn**: leyistin, baz dan, revîn
"**Çerx** e felek û melek **dibazin**
Şemsun we kewakibun we ebrac"
"Li ber çogan û kaşûyan ji derba Turk û Hîndûyan
Dibazim herwekî goyan dema ew têne meydanê"

**behîtin**: helandin
"Cewra te behîtîn û cefaya te perîtin
Qurbanî te bim guh bide carek gilehê min"

**bejn-aferî**: bejna ku bi naz dimeşe
"Da xef nebit bejn-aferî mey hate şehkasa surî
Mînnet ku îro dîm-durî dîsa şeraba nab da"

**belazîz**: gezîze, sunbula daristanê, ya kûvî
"Ku lê têt ew qebaya asimanî
Letîfa şeng û nazik wek belazîz"

**belg**: pel; *bnr.* li perr

**benda heyderî**: xişrê li ser kofiyê
"Kewkeb û qewsê qezeh lu'luê benda heyderî
Tên tewafa zulf û xalên dilrubayê rast û çep"

**bend**: girtî, dîl, girêdayî
"Dil bendê dava zulfekê keftî kemenda ulfekê
Hel fî yed-îl meftûnî şey ew key fe esne' ya feta"

**ber ve**: ber bi
"Ber ve şerqê di seher westayin
Hîndûyên rojperest in çep û rast"

**ber**: kevir, seng
"Çi eser dê li berî xare bikit qetreyî ab
Qelemê me bi dosê qetreyê zuha dê çi kit"

**berî**: sade û hêsa
"Girişme û raza berî 'arif venabin lê derî
Hetta di nêva agirî ew xef nebit perwane reqs"

**berx**: birca karikê, birca berxê
"Heyheya reqs û semaya te çi xweş bestiye çerx
Ku di burcê bi sema têtе li ser destê xwe berx"

**bestîn**: girêdan, rapêçan; *bnr.* li berx

**bexşîn**: 'efûkirin, dayin
"Yek bûse bexşî ewwel bi îhsan
Axir li min kir curm û xeramet"

**bext**: îqbal, talih
"Zuhre û 'îqda sureyya keşşifî bûn ew di şerq
Sayeya bextê me dayê ma li ser perde û nîqab"

**beyhûde**: bêhûde
"Kes bi dada me nepirsit gileh û dad çi kit
Te nebit dadresek beyhûde feryad çi kit"

**bêgav**: tim, bêwext
"Aşiqan bêgav lew kalîn ji dil tên şubhê re'd
Wan ji bala lê dibarin wek brûskan remz û naz"

**bêt û ret**: were û here
"Her mecala ew di cengê bêt û ret her carekê
Rast û çep de bêxitin, sed bi mizraq û qeseb"

**bêvîr**: nexweşê li ber mirinê, ji hêz ketî

"Herçî bêvîrê ku navê dilberê bêtin li ser
Xweş dibit hadir di gavê bê guman û
şubhe ye"
**biçîn ver**: li berê biçîne (deyne)
"Enqa ne şikara kes e davan tu biçîn ver
Dava ku enqa tu vedî badî hewa girt"
**binoşîn**: em vexwin
"Heyata dil meya baqî binoşîn da bi
muştaqî
Ela ya ey-yuhes-saqî edir kes'en we
nawil ha"
**biretin**: herin, biçin; *bnr.* li bêt û ret
**biste**: bê tirs, bê şerm, bê teklîf
"Were xanim bikuj biste bi xencer
Melê, emma bi destê xwe-y mubarek"
**bişko**: bişkok
"Çing-çînga bişkoan awaz û dengê zer-
goan
Sed melayik guh didin ber wê newayê
rast û çep"
**bişkoj**: xonçegul, xonçe
"Sehergeh endelîb mest in ji bihna werd
û bişkojan
Şubeh tûtak û goyînan dinalîn em di
firqê da"
**biwar**: bihart
"Weh ku bê şahid û mehbûb te umrê
xwe biwar
Karekî rabe bike weqt e ku êvar e
dereng"
**biwerîn**: werîne, bîne
"Veke lêvê û ji nîvê biwerîn qend û
nebat
"Ji lebê le'lê şekerbêj û ji şeker meke
behs"
**bînahî**: ronahiya çav, qudreta dîtinê
"Şukur bînahiya min hat û Ye'qûb dîde
rewşen bû
Bi bûya Yûsifê Misrî li Ken'anê beser
peyda"
**bîz**: kerahet, xweparêzî, xwe jê girtin
"Xebais-teb' e, j'ehil seg-sirişt e
Yeqîn ew ker ji canan lew dikit bîz"
**bîzî kirin**: hez nekirin, xwe jê girtin
"Bîzî dikit ji qencan ji remz û naz û xencan
Qedrê gulan çi zanit ? Kerbeş divêt kerê
reş"
**buxçe**: baxçê gulan
"Me ji buxçe ya yar zeyyinî bê pirs yek
sêvek çinî
Web'ma ceney tû centeyî elqet'eley ye
cînyeta"
**butperestî**: pûtperestî
"Etwarê 'işq û mestî, esrarê butperestî
Teqîrê sed rîwaret nakit ji bo kîfayet"

## C

**cerg**: ceger
"Mehbûb û reyhan pur gulav ker kir li
min cerg û hinav
Zehra helahil bû di nav lew saqî ew cul-
lab da"
**cuht**: cot, *bnr.* li bac

## Ç

**çelek**: xwarbûna wekî serê çoganê
"Êsîr kirim zulfa çelek ew horiya şubhet
melek
Tîr dan ji reştozên helek mecrûhê qewsê
purweşîn"
**çenber**: xelek, daîre, muhasere
"Xef da me cama kewserê şirîn-qed û
leb şekkerê
Bayê seba da çenberê hatin sema şetrî û
lef"
**çendan**: ewçend
"Zehrî derdê mezin firqet ciger sot ateşî
da dil
Cihê sebrê nema çendan ferec min dî di
sebrê da"
**çengal**: çengel
"Sur şîrînê, nazenînê, kuştime nakit yeqî-
nê
Wê bi çengala evînê dil ji min bir dil ji
min"
**çeper**: mewzî, sîper
"Tîr sed têne ciger sîne li ber maye
çeper
Ji dil û cergê kul û sîneyê ker-ker meke
behs"
**çerx**: daîre, xelek, felek
"Hin zerî ne pur sur in, serbiperr in
dêm-dur in
Min ku di çerxê we dî sebr û qerar im
nema"
**çevandin**: tewandina wek çenberê
"Ez dibêjim dê li min dîsa ceger sed
pare kin
Wê bi mîzan herdû şîrazî çevandin mahî
new"
**çîn**: xelek, badok, kurîşk
"Çin çîn kirin zulfên siya kesk etlesê
diba qeba
Îdî nîşan nabin xuya têkel kirin lazim
seba"
**çogan**: golf; *bnr.* li bazîn
**çokar**: xizmetkar
"Her serê dewlet hebit dê her di nêv
benda te bit
Herkesê 'aqil bitin dê her di çokarê te
bî"

## D

**dabiristin**: rêz bi rêz bûn, sef girêdan
"Zengiyan cewşen vebestin pêşberî coqa
Hebeş
Dabiristin yek bi yek çûn ber lîwayê rast
û çep"
**dad**: hawar, edalet, medet; *bnr.* li beyhûde
**dane**: tene, tane
"Canê xwe meke daneyê dava ku vedayî
Ahû-sîfet ew pê hesya rahî xeta girt"
**dav**: dafik; *bnr.* li bend
**der dest**: di dest de
"Ji du'ayê qedehek der dest e
Her seher mestî meyî-nabî du'a"
**derbend**: bender, lîman
"Xasî teşrifa te bin derya û derbendê
ecem
Da xelatên her seher sed zerkeş û mex-
mûr bê"
**destgîr**: hamî, alîkar
"Destgîrê te nebit Xidrî 'înayet li qedîm
Nagehî abî heyatê bi du esker Elyas"
**destûr**: îzin, îcaze
"Ji ser dîmê nîqab avêt û destûra tewafê
da
Bi se'yê beyt û îhramê û min eswed
ziyaret kir"
**derîn**: dayin
"Qehweya telx digel zehrî helahîl biderî
Me ji destê te mibarek şeker-amîz e
xweşab"
**di gavê de**: di cih de, tafilê
"Xedenga firqetê re'd e dilê ew xefletê
lê dit
Dibêjim wer cebel bit ew bi ker bit wê
di gavê da"
**digel**: pê re, *bnr.* li derîn
**dihnêrim**: ji hinartinê; dişînim
"Her seher dihnêrim ez cana bi ahan ra
ji dil
Barek-el Bari bi îs'adîn 'eleyha yewma 'îd"
**dijwar**: zor, zehmet
"Sar dibit dil ma bi sed cewr û cefayan
zerreyek
'işq teb'et-nar e hingî dê biçît dijwar bit"
**dilgeşte**: dilmayî
"Dilgeşte me ji dêrê naçim kinîşteyê qet
Mîhrabê wê bi min ra wer da biçîne
Laleş"
**dîdar**: yê dîtî, rû, dîtin
"Kuştiyên dîdar û dînê bê xeta her deh-
sed in
Her seher dîsa ji nû va têne kêrê sed
celeb"
**dîl**: esîr
"Dîl me hezar in te di bendê we lê
Leyse lena 'enke mecalu bedîl"
**dîm**: dêm, *bnr.* li bejn-aferî
**dîn**: temaşe, dîtin, *bnr.* li bal
**dojeh**: cehenem
"Ger ji wê horî siriştê 'işweyek îzhar bit
Dê bibit narî Xelîl-ul-lah û dojeh sar bit"
**dos**: dews; *bnr.* li ber

## E

**eger**: heke
"Bi Qur'anê bi ayatê eger pîrê xerabatê
Bibêjit secde bin latê murîdên wî dibin
qatî"
**Ehremen**: xwedayê tarî û xerabiyê yê
zerduştiyê
"Ehremen te'lîmê dabû Ebyedî dest tê
hebû
Pur bi vê te'lîm û rayê hatibû çûbû
xîtab"

**ejmar**: hejmar
"Lê şehîdên te bi ejmar bi xencer kuştî
Hê neçû xûn ji birînan sed û heftad û du leş"
**endaze**: qiyas, pîvan, usûl
"Remzên te di canan ne bi endaze di raz in
Heryek bi hezar reng rewanê me dixwazin"
**er**: eger
"Ji Hafiz qutbe Şîrazî Mela fehm er bikî razî
Bi awazê ney û sazê bibin ber çerxê perwazî"
**Erjenk**: pirtûka wêne ya Manî pêxemberê îranî
"Bi sîmavê bi zêravê tu rojê neqşekî bavê
Ku da Erjenk ji wê navê li ber rojê nebit perde"
**erzen**: erzêng, çene
"Katibê neqşê qudretê zêrî reşandî ser xetê
Erzen û dîm û cubhete pê neqqişand û kir nuqet"
**eşkere**: aşkera, aşîkar
"Belko dîwar bi guh bin bi Xwedê kî bi Xwedê
Bi tu rengî nekirî eşkere esrarî hudûs"
**ev reng**: bi vî awayî
"Hat der ji burc û penceran dil girt û da ber xenceran
Ev reng e halê dilberan lew 'aşiqan xûn bûn ceger"
**evistin**: evîn
"Agir di ab û gil diket qelban ji qelban hil diket
Metqeb di can û dil diket daîm evistin karî çerx"

## F

**find**: mûm
"Fîraqa dilbera rind e behîtim ez wekî find e
Musilmanik di rê min de xeber bit balî sultanê"
**fira**: yê pirr an zû difire
"Me û nesîm xweş pence têkra wê diçîn wek teyr vêkra
Behsê zulfa yar pêkra bûrî 'işqê pur fira ye"
**firişte**: melek
"Hûr û firişte kê weh dîn nazik û xob û sur şîrîn
Dîmê nimûne ber bikîn sûretê çîn numa xelet"
**fûr bûn**: fûrîn, kelîn, bilqîn
"Her derê ne'lê feres şubhet boraqê vêkevit
Çeşmeyê heywan ji ew erdê mubarek fûr bî"

## G

**gaz**: kelbetan
"Serwî-nazê serfîrazê şubhê zêr remz mecazê
Dame ber çakûç û gazê dil ji min bir dil ji min"
**gazinde**: gazin, gazinc
"Şakîssîlahî her dem bi kuştina Melê bit
Gazindeyan ji kê kim, ji kê bikim şikayet"
**gerçî**: herçend
"Şerhê halê min Mela narit beyadê hê temam
Vê sewadê gerçî her dem jê birin sed întîxab"
**gerd**: xwelî, toz
"Suhtim ez pêta evînê têk biwam gerd û heba
Inne lî ayatî sidqîn kane fî haz-en-neba"
**gerden**: cihê sîng û stû digihîjin hev
"Wê şepalê misk-xalê dîmdurê gerdenşemalê
Cebheta biskan sema lê dil ji min bir dil ji min"
**gestin**: gez kirin
"Gestîme xelq û 'eqrebê mest im ji şewqa xebxebê
Tali' tinê me d'kewkebê îro 'eqarib têne der"
**geşt**: gerr, seyran
"Buxçeya sorgul di geş tê çîçek û reyhanê reş tê
Dilrubayan têne geştê sunbulan ta ta sema ye"
**gêra**: guhart, guhirî
"Feyza 'ulûmê hikmet cama sedef ku gêra
Me j'destê muxbeçan dît bi mishef û bi ayet"
**gil**: herî
"Her gil û seng dibitin zêr bi tedbîrê hekîm
Qabiliyet ku nebit hikmetê ustad çi kit"
**gileh**: gilî, şikayet; *bnr.* li behîtin
**girtî**: hebsî
"Dilberê serdarê xûban ez nizam agah heye
D'hebs û zîndanê esîr girtiyê dermande ye"
**go** : gog; *bnr.* li bazîn
**goş**: guh
"Goşî bi 'amê me de terkî mudamî me de
Ekserûhum fi xuma exlebûhum fî 'ema"
**goyger**: gobaz, yê xweş bi gogê dileyize
"Textê di mîr û begleran meydanê coqa goygeran
Eslan û cotê meyxuran mey dan şeraba saxerê"
**goyîn**: cureke balinde ji malbata pepûkê; *bnr.* li bişkoj
**gulav**: ava gulan; *bnr.* li cerg
**gunbed**: qube
"Wê bi sed pencereyan daye şu'aya qidemî
Gunbedî işqê li ser kursiyê dewwarî hudûs"

## H

**heçî**: herçî
"Heçî firqet nedî hîcran nebê min dax û key lê ne
Ji bil derbê di hîcranê fîraqa rûh û can kê da"
**heç wekî**: herwekî
"Secdeya ber eswedan nadim bi sed hec-ekberan
Sond bi wan zulfan û xalan heç wekî bêjim we ye"
**hela**: hê, hêja, hele
"Pur min ji vê çerxê Mela kêşane afat û bela
Ebleh bibînim wî hela herçî ji dil bit yarî çerx"
**hema**: tafilê
"Teşbîhê bi cedwel me di nêv ateşî işqê
Dil qelbê heqîqet bit û iksîrê hema girt"
**hempa**: emsal
"Li min pirsek bi dildarî dibit hempayê dîdarê
Vewestayim di ferwarê li 'ebdê xwe ke fermanê"
**henarîn**: şandin, hinartin
"Qasid bi meqsûda me hat ba mujde û emr û berat
Nîşan hinarîn hem xelat şehzadeya gulgûn qeba"
**heriftin**: roxandin
"Lew heriftim ez ji meylê şubhetê sihlê û seylê
Muhbet û 'işqa di Leylê ez kirim yekser pilox"
**hevdeng**: emsal
"Zerîfê nazikê şengê sifethorê perîrengê
Bi rojê ra tu hevdengê du reştozên siyehrengê"
**hevotin**: fêr kirin
"Hostayê 'işqê dil hevot ser ta qedem hingî disot
Remza en-el-Heq her digot bawer bikin Mensûr e dil"
**hey û hey**: timî û daîm, hê jî
"Qedehek taze ji 'işqê di ezel da me hekîmê
Jê dinoşin hey û hey hê bi xwe cama me lebaleb"
**hilê**: (roj) hilê
"'îd e û hebîbê nezr e lê yan dê bi qurban bî Melê
Ya Reb bibînim roj hilê sikkîn di dest qessabê da"
**hindav**: raser; *bnr.* li balîn
**hingaftin**: lêdan, îsabet kirin
"Kûsê ku hingaft bi şahî li text

Padişehan neqdî rewan dan xerac"
**hingî**: ewçend; *bnr.* li hevotin
**hir**: hire, vira, vê, vêder
"Er ne hudhud ji Seba bêt û wekî bayê Seba
Dê ji hir ku bigehit dest ve peykê heremê"
**hol**: topa ji kulav an ji potik çêkirî; binêre li gogê
"Mîr û Kurmanc li holan qederekî westane
Lê di nîvê bi sef û tîpê ereb hatine ceng"
**hosta:** osta; *bnr.* li hevotin

## J

**jehrî**: bi jarî
"Zulfên bi tew şîrîn leban jehrî ne şubhet 'eqreban
Lê min ji biska pur girî îro tinê girtin du ta"
**jeng**: zeng
"Newaya mutrib û çengê fixan avête xerçengê
Were saqî heta kengê neşoyin dil ji vê jengê"
**ji rengê**: mîna, wekî, bi mislê
"Me ra j'ewwel çi bir xamê kişand axir bi bednamî
Ji rengê Se'dî û Camî ji şuhret pê hisîn 'amî"
**jih**: têla sazê muzîkê, rûdiyê zirav
"Ger şubhetê perwane di bezmê te çi sed ger
Sed nale hezar rengî wekî çeng û jihê min"
**jiha**: ejdeha
"Zinhar e kesê dest bibit erqemê serwê
Bê 'işweyê le'lan ne bi teslîm jiha girt"
**jî**: umr, temen
"Muhbet û mihnet di zor in hub dibêm bê şek bela ye
'Umr û jî xweş pê diborin sotin û derd û cefa ye"

## K

**kalîn**: nalîn; *bnr.* li bêgav
**kan**: xezîne, ciyê maden û xwê jê derxistinê
"Kan bi gewher çi bikit gewher eger pak nebit
Tu besîret te nebit sîretê ecdad çi kit"
**karsaz**: jêhatî, yê ku kar pêk tîne
"Sed baziyan ev huqqebaz tînit bi hîle karsaz
Geh geh ku naz e û geh niyaz sehhar û pur mekkarî çerx"
**kas**: piyan, kase
"Herçî rengê te bivêtin xwe bibinî lîllahî
Nezerê wer bide kasê çi xweş ayîne ye kas"
**kaşû**: kaşo, darê serkaşo yê çoganê; *bnr.* li bazîn
**kemend**: tayê serî bi hilboq; *bnr.* li bend
**ker kirin**: perçe kirin; *bnr.* li ceng
**keyber**: kêra mezin, birîn
"Min di dil kovan hezar in dax û keyber bê hisab
Mihneta werdên bi xar in wên di dil da sed nîşab"
**kezeb**: cegera reş, mêlag
"Xefletê ew keşşifî şîr dest bi dest hatin ceger
Go xebînet ya Mela miskîn Melê ker kir kezeb"
**kêmxew**: qumaşê qedîfe ku xew (pûrt)ên wî kêm in
"Nazik letîf gerden zerîf lebsê şerîf kêmxew qedîf
Min dî bi wext ew nîk-bext îro li text fexfûrî bû"
**kilox**: qafê serî
"Dest nehêlim ez ji dînê şubhê Ferhad û Şîrînê
Wer ji ber 'işq û evînê min di rê çit ev kilox"
**kok**: xweşik, bi edeb, mukemel
"Tu bimeş kok bi ser derê qesrê
Bi xwe kokî li şah û qeyser ke"
**kovan**: derd û hesret; *bnr.* li keyber
**kûre**: hêtûn
"Fa'ilek lazim e da fi'l û eser peyda bit
Ger tu heddad nebit kûreyê heddad çi kit"
**kûze**: cêrê avê
"Tu şerabê bi xerabê bi nehingan deh demî
Dê kifayet bi çi rengî me bikin kûze û tas"

## L

**lê miştin**: tê gevizandin
"Bi derbên xenceran kuştin bi xwîna sohrî lê miştin
Di çîna sunbulên qişt in me dil pur misk û mawer de"

## M

**meger**: wisa ku, halbûkî
"Meger şîrîn bi wê şîraniyê bû
Ela şems-ul melahet qed tuşarek"
**meyfiroş**: şerabfiroş, meyxanecî
"Muxbeçeyên meyfiroş her seherê tên sema
Badexwiran noş noş mane li dorê cema"
**misrî**: şûrê destkariya Misrê
"Xencer û tîr û teber barîn şibih berq û brûsk
Misriyan lamî' ji elmasan didayê rast û çep"
**mist**: kulmekê, kulmek bi dev re; *bnr.* li ax

## N

**naçar**: bêçare
"Hey'eta keyf û kemê bê keyf e keyfa arif e
Dê bimînit ger nebit naçar bê tiryak rûh"
**napak**: neqenc
"Cami 'işqê paki rûhani tuhûra batin e
Ê nenoşî her we ma hetta ebed napak rûh"
**neşêm**: nikarim
"Mey ber kefê meşha sefê soza defê da qerqefê
Husna li dêm wesfan neşêm herçî dibêm jê dûrî bû"
**neynik**: eynik
"Gerçî her daîm ji mihrê neynika dil bedr e min
Wek hîlala subhe têm ez carinan bim napedîd"
**nihe**: niho, niha
"Te divê dawî birî bit nihe da
Bibirim ser bi du enguşt meqes in"
**nima**: nîşan dan, temsîl kirin; *bnr.* li vê ra
**noş bit**: afiyet bit
"Herkesê camê ji destê wê binoşit noşî bit
Ê ji wî destî nenoşî zehrî bit lê ew medam"
**noşîn**: vexwarin; *bnr.* li napak
**nuhtin**: îsabet kirin, hingaftin; *bnr.* li suhtin
**nûbar**: berê nû teze, cureke kevanê bû ku pê çend tîr bi hev re dihatin avêtinê.
"Gezmeyek qewsê şevîn aşiq bi nêva dil kevit
Dê ji can destan bişot xasma kevan nûbar bit"

## P

**payan**: dawî
"Husn û cemalê canan nadêritin tu payan
Herçî nebit bidayet esla nehin nihayet"
**pehnî**: pehnayî, rastayî
"Pehniya wê çerx û dolaba dinê
Nisbeta erbabê 'irfanê xelet"
**pencere**: pace, şibak
"Wê bi sed pencereyan daye şu'aya qidemî
Gunbedî işqê li ser kursiyê dewwarê hudûs"
**pergar**: pergela xêzkirina çenberê
"Kes dî li lewhê sîne qet neqşek ve hatî bê xelet
Herdem ji nû yek taze xet tavête der pergar xet"
**perhîz**: xwe parastina ji hin xwarin û vexwarinan
"Şem'ê ser nûr nadirit ger ew nekit perhîz dil
Zewqê cama işqê nakit ger nekit îmsak rûh"

**perr**: polik û pereyên xişirê xemilandinê
"Şetrî û zulf û belg û perr hemyan li dêm de'we û şer
îlan li sewa bûne ger 'eqreb xuyan ez her teref"

**perwane**: perperoka li dora çirayê digere, aşiq; *bnr.* li berî

**pertew**: ronî, purtew
"Heyf di qeyda xak û gil bit arifê çalak rûh
Dê mucerred bit ku pertew dit ji nûra pak rûh"

**peyda**: hasil; *bnr.* li bînahî

**pêt**: alav
"Brûska batinî da dil di pêtî sîne wê wer bû
Ku dê bêtin tebîta dil di nav wê nar û pêtê da"

**pilox**: bizotê agir
"Lew heriftim ez ji meylê şubhetê sîhlê û seylê
Muhbet û 'işqa di Leylê ez kirim yekser pilox"

**pîrê muxan**: pîrê meyxanê, serekmelayê zerduştî
"Xizmeta pîrê muxan dê kit kesê meq-sûd e mey
"Şîşe û cama zucacî yê divêt dê ret Heleb"

**poşîn**: pûşî giredan, xêlî kirin
"Ji wê camê dinoşim ez
Seher lew ney li hoş im ez
Ji 'amê lê dipoşim ez
Bi can her lê dikoşim ez"

**pur sur**: cazib, dilkêş
"Hin zerî ne pur sur in ser bi perr in dêm dur in
Min ku di çerxê we dî sebr û qerarim nema"

**pur**: pirr, gelek; *bnr.* li cerg

## Q

**qe**: hîç
"Ji lebê le'lê şeker yar qe nekir pursa Melê
Misriyan gezme reşandin ku kişandine elmas"

**qeyser**: împarator, kayzer, çar; *bnr.* li kok

## R

**rimbaz**: leşkerê bi rim şer dike, hostayê rim bikaranînê; *bnr.* li aferîn

**rîşî**: gulik
"Netrik û tayên bi rîşî ê di zêr in pê ve wîşî
Min du fêris dîn di pêşî mirwet û insaf yox"

**ruswa**: rezîl, bê îtîbar
"Ruswayê 'işqê tenha ne ez bûm
Kes dî zemanan hub bê melamet"

## S

**saye**: hîmaye, alîkarî, siyanet, sî; *bnr.* li bext

**seng**: ber, kevir; *bnr.* li gil

**serbiperr**: ya ku tûncik û temorîk bi perrikê zêr in; *bnr.* li pur sur

**sermal**: pêçeya li serî tê pêçanê.
"Sosinên taze û muşkên walan
Bes perîşan ke li ser sermalan"

**serw**: selwî; *bnr.* li jiha

**seywan**: sîwan
"Erzê halê min bigota yê bi 'inwanê edeb
"Asîtan bikra ziyaret çetr û seywan û tunab"

**sêgah**: cureke meqamê muzîkê ye ku zuhdeke xurt û hizneke aşkere distirê.
"Lîllah were saqî bi du caman me ciwan ke
Mutrib bi defê ra bide sêgah û şebabê"

**sîne**: sîng, dil
"Rast û çep têne ceger sîne kulab
'Er'erên şengî dilestin çep û rast"

**suhtin**: sotin, şewitandin
"Bi narê firqetê suhtim ji ferqê ser heta pê da
Xedenga xefletê nuhtim ji berqa lamî'a tê da"

**sunbul**: simil; *bnr.* li geşt

**suxte**: feqeh, şagirt
"Go suxte murada xwe ji min telbe ke îro
"Min go ji kerîm telbe û daxwazî çi hacet"

## Ş

**şahbaz**: bazê spî
"Ew dilê min wek kebûter nabitin kes lewme ket
Lew di vê torê we da keftî me dîn sed şahbaz"

**şahîn**: şahbaz
"Teyrê dil bê tem'ekî nayête dest şehza-deyan
Qûşçiyê şahîn di destê dê dibê azar bit"

**şahnuşîn**: şaneşîn, balkon
"Şahnuşînên nazikan zayi' mekin
Da nebîni dil bi xanê xelet"

**şehsiwar**: şahê siwaran; *bnr.* li aferîn

**şek**: lêdana bi çoganê
"Mislê goy bê ser û pa bûme li ber derb û şekan
Lew bi çoganê cefa ya xwe ji dil hûrî kirin"

**şeng**: bi kêf, bi şipil; *bnr.* li belazîz

**şepal**: bejna lihevhatî û xwînşîrîn, ferxê şêr
"Xwîn ji dil co co rewan tê wek 'eqîq û erxewan tê
Lê ji dest selwa ciwan tê ew şepala şeng û şox"

**şetrenc**: setrenc
"Di meydanê şîrîn xencan bi çerxên mislê şetrencan
Turaba ber piyê qencan zubad û 'enbe-rên gerd e"

**şîret**: nesîhet
"Xelqno li min kin şîretê ew dilbera zêrîn kemer
Min dî di halê xefletê hat der ji burcê wek qemer"

**şîşe**: şûşe; *bnr.* li pîrê muxan

## T

**tar**: çenbera pehn a ji dep an metal; tara deholê
"Tu ji ber perdeya wehmê were der da bibihî
Çi newa têt e bi sed nexme ji ew tarê hudûs"

**teba**: tev de
"Sebr û qerarim ku bir can û ceger hûr dikir
Zulmê we reng kî dikir can dibir û dil teba"

**tenha**: tenê, xalî; *bnr.* li ruswa

**tepandin**; bi serî de anîn, tûşî kirin; *bnr.* li wer ne

**terazin**: mêrg û çayira li keviya; *bnr.* li al'al

**tewizandin**: givaştin, xemilandin
"Nesrîn û binefşe tewizandin
Mawerd direşand şûşeî 'ac"

**teyîn**: tewîn
"Tiliyên nazik şemalîn min li ser çehvên xwe malîn
Talibê werdên bi xal în dil di vê fikrê teya ye"

**tê werbûn**: çeng kirin, êrîş kirin
"Cin û teyyarek me dî wer bû di min winda kirim
Dame ber pence w kulaban hilfirandim wek 'uqab"

**têkel kirin**: tevlihev kirin
"Wajîgûn dewrê numa min çerx û bayê lewleban
Kewkeban seyra muxalif girt û têkel kir hîsab"

**tinê**: tenê; *bnr.* li jehrî

**tîp**: deste leşker, deste siwar; *bnr.* li hol

**tu**: hîç; *bnr.* li kan

**tundî**: tîjî, tûjî (gurr)
"Da me şehzade bi destê xwe mubarek qedehek
Ne xubarek ji xumarî û ne tundî û ne xeş"

**tûle**: cewrik, dêlik
"Ku tûlê asitanî dûr nekî êdî ji dergahê
Ji ba Xwo vî rucû nakîn di babê lutt û rehmê da"

**tûtak**: tûtî, dûdû
"Sehergeh 'endelîb mest in ji bihna werd û bişkojan
Şubeh tûtak û goyinan dinalîn em di firqê da"

## U

**umid**: hêvî

"Bi umîda te humayê ne Melê tûr veda
Wer temaşayê cihan bûye hemî tûr û şebek"

## V

**vajî**: ters
"Munqelib min dî menazil vajî ew seyrê dikin
Yek bi yek xwîn jê dibarin ateş û lem' û şîhab"
**ve**: ecêb, veh
"Ve Melê sur periya hûrî sifet
Sed melek destî be dest in çep û rast"
**vebestin**: xwe rapêçan
"Zengiyan cewşen vebestin pêşberî coqa Hebeş
Daberistin yek bi yek çûn ber lîwayê rast û çep"
**vejîn**: ji nû ve jîn
"Ji remza dilberê dîsa li min hatin vejîn derd e
Di lebsê tariyê min dî xwiya bû ew siyah-çerde"
**vemal**: bimale
"Zulf çûne ser nûra zelal carek were bayê şimal
Biskan ji ser dêmê vemal zulfan ji ber cotê esed"
**vewestan**: sekinîn, rawestan; *bnr.* li hempa
**vexwendin**: dawet kirin
"Bi tûlên asitanî ra vexwendim mîr bi dergahê
Bi vî çavî hebîb dîtim şukur ev şefqê Mewlê da"
**vêk ra**: pê re
"Zuhre rengê mal û xurşidê ji bala wê nima
Lew du kewkeb çûne vê ra îstiwayê rast û çep"
**vêk ketin**: yekdîger bûn, bûne yek
"Vêk ketin şems û zuhel îro di burca 'eqrebê
Seyf çû destê merîxê mulkê dil lew bû xerab"
**vêkra**: bi hev re, bi hevûdu re
"Bi werdan zeyyinîn gulşen çîmen da lale bişkiftin
Binefş û çîçekan vêkra şefeq da yek di rewdê da"
**vi** : bi
"Şox û şepala meyperest ew zalima hişyar û mest
Vê nameyê xef dî vi dest fî teyyiha neşrun-neba"

**vîn**: îrade
"Husn û cemalê xwest evîn vêkra di yek zatî civîn
Nûra qedîm bû 'işq û vîn wan li êk naz û 'işwe da"

## W

**wajîgûn**: berevajî, bê oxir; *bnr.* li têkil kirin
**we**: weha; *bnr.* li pur sur
**weh ku**: wisa ku; *bnr.* li biwar
**werhatin**: gevizîn
"Bi dama muhbetê bend im xedenga fîrqetê dil nuht
Bi şubhê murxê nîm-besmel di hev wer têm di xwînê da"
**wer ne**: heke na
"Setweta Leylê yeqîn Mecnûn tepand
Wer ne Qeys nakit beyabanê xelet"
**westan**: muhlet dan, navbir, man, rawestan
"Ber vi şerqê di seherê westayin
Hindûyên rojperest in çep û rast"
**wêran**: kambax
"'Alemek wêranî zulfên te ji rengê 'enberê
Çerx û perwazê didin carek li bayê rast û çep"
**wîşî**: gûşî; *bnr.* li rîşî

## X

**xak**: erd, ax
"Da di çeşman min werîna xakê her wek tûtiya
Ya hebîb pê lê nihayî baniya wê ew turab"
**xal**: nuqte, deq
"Bi xalên werd û nesrînan ji Qudret xet kişandî lê
Bi terha nêrgiza 'êlî sehergahan nesîm lê da"
**xasma**: nemaze; *bnr.* li nûbar
**xemrevîn**: ya xemên meriv direvîne, yar
"Xema 'işqê perihtim ez hebîba xemrevîn kanê
Seraser têk behîtim ez ji derdê firq û hîcranê"
**xêlî**: pûşîya ser rû
"Li ber rojê bibit xêlî binêrim qameta 'êlî
Qedîf û zerkeş û têlî zebad û mîsk û 'enber da"
**xunav**: aviya li ser gul û giya
"Li gulên tey' terr û nazik ku seher girtî xunav
Di ebarîq û qinînan ji hesed suhtî gulab"
**xwe spartin**: tewekul, îtimad
"Kor e xwe nasipêrit carek bi dest delîlan
Ebleh çi kit tewafê nabînitin berê reş"

## Y

**yeksan**: beranber, wekhev
"Ê bi Xidrî ra divêt ava heyatê bit nesîb
Dê bi se'y û cehdê yeksan bin li bal wî roz û şeb"
**yekta**: bê emsal, li ser tayekî
"Nisbet perî zîba ye ew wek nêrgiza yekta ye ew
Ya men rea xillî fe hel yuşbî bî şey'în qameta"

## Z

**zehr**: zar, uslûba peyivînê
"Bi zehrê xwe î şerîf xwendim ku xizmetkarî dêrînî
Te pur cewr û cefa dîne silûk û se'y û cehdê da"
**zend**: milê jêrîn, ji enîşkê heta qevdika dest
"Wan dest û zend û sa'idan mey dane şeyx û zahidan
Mestî bi çeşmê şahidan ew nêrgiza seyrab da"
**zengar**: kesk, sewz
"Herfên ji qudret nuqte pur madarê hewza le'l û dur
Ev rengî kê dî weh bi sur qudret-nimûn zengar xet"
**zengî**: zencî; *bnr.* li vebestin
**zerbaf**: qumaş an perçeyên ji hevdayên zêr têkel
"Zulfa siyah 'enber bike xemlê ji zêrê zer bike
Zerbaf û dîba ber bike misk û gulavê lê reşîn"
**zerbav**: kanarya
"Reyhan û sunbul tê hene sed çîçek û gul tê hene
Zerbav û bulbul tê hene ew baxçeya gulzar xet"
**zergo**: guharê zêrîn; *bnr.* li bişko
**zerkeş**: li ava zêr xistî
"Wer guh de çeng û nayê şîrîn ku bên semayê
Camê binoşe vê ra çi sade û çi zerkeş"
**zêrav**: ava zêr
"Bi sîmavê bi zêravê tu rojê neqşekî bavê
Ku da Erjeng ji wê navê li ber rojê nebit perde"
**zînhar**: eman ha!; *bnr.* li jiha
**zîwer**: xişir, tiştên xemlê yên ji zêr
"Zêr û zîwer dikirim celbê qulûban haşa
Husn û sur zatî nebit qametî meyyad çi kit"
**zox**: zoxav, kêm
"Ah û oxên min ji dil tên lê ji ber tîra qizil tên
Yan ji kovanên di kul tên jê dizêt her xwîn û zox"

(dumahîka *Termên rojname û rojnamevaniyê*)

| | | | |
|---|---|---|---|
| raxistina rûpelan | sayfa düzenleme | mise en page | make-up, making-up, lay -out |
| montaj | montaj | montage | setting |
| sekreter | sekreter | secrétaire | secretary |
| beşdar | katılan | participant | participant |
| beşdarî | katılım | participation | participation |
| tevkar | katkıda bulunan | contribuant | contributor |
| tevkarî | katkı, katkıda bulunma | contribution | contribution |
| hevkar | işbirlikçi, iş arkadaşı | collaborateur | collaborator |
| hevkarî | işbirliği | collaboration | collaboration |
| xwudan, xwedî | sahib | propriétaire | proprietor, owner |
| Xwedê, Xuda | Tanrı, Allah | Dieu | God |
| wergerandin | tercüme etmek tercüme | traduire | to translate |
| werger/wergerandin | tercüme | traduction, action de traduire | translation |
| wergêr | mütercim, çevirmen | traducteur | translator |
| wergerandî | çeviri, çevrili | traduit | translated |
| wergêrî | çevirmenlik mütercimlik | métier de traducteur | translatorship |
| tercuman, paçvan | tercüman | interprète | interpreter |
| paçve, tercume | tercüme (tercümanlık) | interprétation | translation |
| tercumanî, paçvezanî | tercümanlık | interprétariat | interpreting |
| arşîv | arşiv | archive | archive |
| rast kirin | düzeltmek, tashih etmek | corriger | to correct, to read (proof) |
| rastkirin | düzeltme, tashih | correction | proof-reading |
| rastker | düzeltici, tashihci | correcteur | proof-reader |

# JI PIRSÊN GRAMERA KURDÎ

Mîr Celadet BERDIRXAN
& Roger LESCOT

**KETINA FONEMAN Û SIVIKBÛYÎN***

Yek ji xasiyetên zimanê kurdî ew e ku timî sivikbûyîn û weciziyê digere. Ev meyl li nemaze di hevoksaziya (sentaksa)1 vî zimanî de tê dîtin. Emê di paragrafên jêrîn de bibînin ew çawa xwe di qanûnên fonetîkê2 de nîşan dide. Her gotinekî kurdî, bi veguherîneke xwezayî (tabiî), hingî diçe kurtir dibe, hin bi hin hejmareke ta mimkin mezin a dengên xwe davêje, ta ku bibe yekîteyî (yekheceyî). Ev veguherîn geh bi avêtina hin elemanan, geh bi vekişînê3 dibe. Emê yek bi yek li van her du awayan binêrin.

**KETINA DENGDÊRAN**

Em dizanin ku dengdêrên e û î, gava ku nêzî dengdêrên dirêj bin pirîcar dikevin. Va ne hin mînakên (mîsalên) din ên ketina dengdêrên kurt û dirêj:

*Rizyang*, giyayek, ji bo *rizyanik*.
*Dargering*, giyayek ku xwe li daran dipêçe, ji bo *dargerînek*.
*Argûşk*, keviyê paşîn ê çena jêrîn, ji bo *alîgûsk*.
*Parxan*, ji bo *parûxan*.

**KETINA DENGDARAN**

Pirîcar çend dengdar bi hev re dikevin ji bo ku gotin siviktir bibe:

a) Di nava gotinan de.

| | | | |
|---|---|---|---|
| **Mînak**: | *Desgeh,* | ji bo | *destgeh.* |
| | *Domam,* | ji bo | *dotmam.* |
| | *Desmal,* | ji bo | *destmal.* |
| | *Cênik,* | ji bo | *cêndik.* |
| | *Biçeng,* | ji bo | *binçeng.* |
| | *Cihar,* | ji bo | *cehwar.* |

b) Di dawiya gotinan de. Gelemparane ji her du dengdarên dawî ya diduyan winda dibe.

| | | | |
|---|---|---|---|
| **Mînak**: | *Yekşem,* | ji bo | *yekşemb.* |
| | *Por,* | ji bo | *port.* |
| | *Ben,* | ji bo | *bend.* |
| | *Berçav,* | ji bo | *berçavik.* |
| | *Erzîn,* | ji bo | *erzînik.* |
| | *Gir,* | ji bo | *girs.* |

Lê çend mînakên ketina dengdara pêşî, ya ji her du yên dawiya gotinê, jî te dîtin:

| | | | |
|---|---|---|---|
| **Mînak**: | *Zengelok,* | ji bo | *zengelork.* |
| | Pêpik, derece, | ji bo | *pêping.* (ji pêpeling). |

**KETINA KOMÊN FONEMAN**. Di gelek gotinan de, dengdêr an dengdarên bi serê xwe na lê çend fonem bi hev re winda dibin. Guhêrandinên wilo gelemperane dogitinên ku sê an bêtir kîteyên (heceyên) wan hene de xwe nîşan didin û dixwazin ew bikin du - an sê kîteyî.

**Mînak**: Di dawîya radera (infinitiva) lêkeran (fiîlan) de - *ayîn dibe - an.*

- *ihan*

| | | |
|---|---|---|
| *Nêrîn,* | ji | *nihêrîn.* |
| *Gurçik,* | ji | gurçîlik. |
| *Ar,* | ji | *agir.* |
| *Tevnepîrk,* | | |
| *tora pîrhevokê,* | ji | *tevna pîrikê.* |
| *Zêrker,* | ji | *zêringer.* |
| *Parsû,* | ji | *peransû.* |
| *Mestir,* | ji | *mezintir.* |

Vekişîn. Emê fonemên vekişînê di du koman de ji hev veqetînin:

**a**) ên ku berhemên rasthatinên tesadufî (daçek û pronav, pêşlêker û lêker, hwd.) ne.

**b**) ên ku bi awayekî timî di nav gotinan de xwe nîşan didin. Encama wan hemûyan ew e ku hin komên sabît ên ji dengdêran (gelemperane yên kurt) û ji dengdaran pêkhatî winda dibin, cihê xwe ji dengdêrên dirêj ên yekta re dihêlin.

Di tabloyên jêrîn de me teşeyên (formên) ku di hin devokên çiyayî yên bi awayekî giştî kevnaperêztir (Botan, Hekarî, Behdînan û heta Tor Abdîn) de mane û peyvên devokên deştê dane ber hev. Hejmar û lihevkirina van mînakan wisa ne mirov dike teoriyek çêke û bêje ku ev veguherîn di pêşveçûna sîstema dengî ya kurdî de qûnaxek nîşan didin.

Nivîsarên klasîk ên kevn ên li ber dest kêm in û kêm faîde ne ji bo teyîda vê teoriyê: em hê li hêviya çapên wan ên zanistî ne û ji xwe di wan de gelek peyvên erebî û farisî hene.

*a*, yek di şûna komên *-eh-*, *-we-*, *-ehe-*, *-ehi-* de xwe nîşan dide.

| | | | |
|---|---|---|---|
| **Mînak**: | *Kanî,* | ji | *kehnî.* |
| | *Patin,* | ji | *pehtin.* |

*Danû,* ji *dehnû.*
*Daşik,* ji *dehşik.*
*Canî,* ji *cehnî.*
*Ra,* ji *reh.*
*Bajo,* ji *behjo.* (fermana *ajotin*).
*Bavêje,* ji *behvêje.* (fermana *avêtin*).
*Bawer,* ji *behwer* (bawer kirin).
*Şar,* ji *şehir.*
*Panî,* ji *pehnî.*
*Paîz,* ji *pehîz.*
*Fam,* ji *fehim.*
*Xastin,* ji *xwestin.*
*Xwar,* ji *xweher.*
*Par,* ji *behir.*
*Tal,* ji *tehil.*
*Çav,* ji *çehiv.*
*Pan,* ji *pehin.*

*ê,* yek şûna komên *-eh-*, *ehi-*, *-ey-* digre.
**Mînak**: *Rê,* ji *reh.*
*Bêvil,* ji *behvil.*
*Şê,* ji *şeh.*
*Rêl,* ji *rehil.*
*Avêtin,* ji *avehtin.*
*Mêvan,* ji *mehvan.*
*Bêtir,* ji *behtir.*
*Rêtin,* ji *rehtin.*
*Çêlek,* ji *çehlek.*
*Pê,* ji *pey.*
*Kêf,* ji *keyf.*
*Elêh,* ji *eleyh.*
*Hêv,* ji *heyiv.*
*Mêw,* ji *meyiw* an *mehiw.*

*î,* yek şûna komên *-ih-*, *ihi-* û *-iyi-* digre.
Mînak: *Tirî* ji *tirih.*
*Bî,* ji *bih.*
*Cî,* ji *cih.*
*Pêçî,* ji *pêçih.*
*Sipî,* ji *sipih.* (heywanek wekî *kêçê*)
*Sîwan,* ji *sihwan.*
*Sî,* ji *sih.*
*Dîtin,* ji *dihtin.*
*Bibine,* ji *bibihne.*
*Rîtin,* ji *rihtin.*
*Mî,* ji *mih.*
*Tî,* ji *tihin.*
*Mîvan,* ji *mihvan.*
*Gilî,* ji *gilih.*
*Bîn,* ji *bihin.*
*Dîn,* ji *dihin.*
*Hîv,* ji *hiyiv.*

Koma *-hi-*, di destpêka gotinan de gelek car dibe *î.*

**ŞANEK I**. Dixuye ku koma *-eh-* geh dibe *a* geh *ê.*
**ŞANEK II**. Teşeyên paralel, destpêkî (îptidaî) an vekişî, ku di tabloyên jorîn de tên dîtin, wekî mehvan û mihvan, ku dibin mêvan û mîvan; heyiv û hiyiv, ku dibin hêv û hîv, tên îzah kirin ji ber ku e û i bi hêsanî şûna hev digrin an cih diguhêrin.

Mirov dikare bibîne ku buyerên vekişîna peyvên biyanî yên ku ketine nav kurmancî eynî wekî yên gotinên bi eslê xwe îranî ne. Wekî di gotinên fehm de. keyf, eleyh. Mînakên wila di lîsteyên jêrîn de jî tên dîtin.

*o,* yek dikeve şûna komên *-uh-*, *-we-*, *-wî-*, *-wi-*, *-ihu*, *-weyi-*.
**Mînak**: *Gotin,* ji *guhtin.*
*Ronî,* ji *rihnî.*
*Ronahî,* ji *rihnahî.*
*Cot,* ji *ciht.*
*Sotin,* ji *sihtin.*
*Ordek,* ji *werdek.*
*Go,* ji *guh.*
*Sond,* ji *swind.*
*Kor,* ji *kwîr.*
*Goz,* ji *gwîz.*
*Stiro,* ji *stirih.*
*Ajotin,* ji *ajihtin.*
*Movik,* ji *mihvik.*
*Motac,* ji *mihtac.*
*Don,* ji *dihun.*
*Bost,* ji *bihust.*
*Borîn,* ji *bihurîn.*
*Xong,* ji *xweying.*

*û,* yek ji komên *-wî-* û pirr kêm car, ji *-ih-* tê.
**Mînak**: *Dûr,* ji *dwîr.*
*Kûr,* ji *kwîr.*
*Qûz,* ji *qwîz.*
*Xûn,* ji *xwîn.*
*Xûşk,* ji *xwîşk.*
*Hûr,* ji *hwîr.*
*Stûr,* ji *stwîr.*
*Tûj,* ji *twîj.*
*Şûr,* ji *şwîr.*
*Şûjin,* ji *şihjin.*

**ŞANEK I**. Koma *-ih-* dikare him *o* him *î* bide wisa jî, *-wî-*, ku piranî dibe *û*, carna *o* dide.
**ŞANEK II**. Peyvên tabloyên jorîn bi piranî ji rehên îraniya kevn tên û di wan de konmên degdêr û dengdar hebûn, û me di mînakên jorîn de vekişîna dûr, dîtin, kanî, hwd. tenê dengdêrên dirêj hebûn.

* Ev bend ji pirtûka *Grammaire Kurde,* Emir Djeladet Bedir Khan & Roger Lescot, Librairie d'Amérique et d'Orient, Paris, 1970, hatiye wergerandin.
**1**.hevoksazî (sentaks): rêza gotinan di hevokê (cumlê) de; awa û rastekên (qaîdên) çêkirina hevokan.
**2**. fonetîk: beşê zimannasiyê ku bi pirsên foneman (her yek ji dengên ziman) mijûl dibe. Fonemên kurmancî di alfabeya kurdî ya latînî de bi 31 tîpan (herfan) tên nivîsîn. 8 ji wan dengêr in: *a, e, ê, î, o, u, û.* 23 ên mayî dengdar in.
**3**.vikişîn bi mana contraction, çûn ser hev, kurt bûn, kişan ser hev hatiye bi kar anîn.

# JI NAMEYÊN XWENDEVANAN

Xwendevanekî *Kurmancî* ji navçeya Midyadê, navên hin gîyayan şandine.

**karî**: Giya ye, reng kesk, bejn 30 cm, sapê wê pan e, nîvgera wê 2 cm ye. Pelên wê wekî yên darê ne, tên hişk kirin û tevî xwarinê dikin, tama goşt dide, bi xavî tama wê tûj e; li çolê tê dîtin (li gor Eleşkîrtî).

**tirşok**: Giya ye, biharê der diçe, bi xavî tê xwarin, tama wê tirş e. Reng kesk, bejn 50cm, sap gilover û nîvgera wê 2 cm ye (li gor Midyadê û Eleşkîrtî).

**gûriz**: Giya ye, biharê derdiçe, ji bo xwarinê tê kelandin (wekî espanax), hêk û rûn tevî dikin, bi xavî tama wê şor e, reng kesk, gava şîn e kulîlkên wê pembe ne (bejn: 1cm), gava mezin dibe bejn 1 m ye (li gor Midyadê).

**qahfûr**: Ji sapa gûrizê tê çêkirin, wekî teneka çopê tê bi kar anîn (li gor Midyadê).

**nûsek**: Li ber avê çêdibe, wekî pelewêsk e, wekî espanax tê xwarin (li gor Elîşkîrtî).

**pelewêsk**: Li ber avê çê dibe, bejn 10cm., sapa wê tê avêtin û ji pelên wê dolme tê çêkirin (li gor Mîdyadî û Eleşkîrtî).

**gûlik**: Mehên nîsan û gulanê derdiçe, bej, 5cm., wekî tiliyeke qalin e, reng kesk, bi kêra tê çinîn, tê kelandin, hêk û rûn tevî dibe (bi tirkî çiliş).

**reşik**: Li ser avê derdiçe, zirav wekî sapan trî ye, tê kelandin û rengê reş dide, ji bo rengdana rîsê tê bi kar anîn (nayê xwarin).

**mendik**: Biharê derdiçe, bejn 30-40cm., wekî cigareyek qalin e, qaçilê ser radikin û bi xwavî tê xwarin, tam û rengê kelenka dide.

**cax**: 2 tilî pan e, bejn 20-25 cm, serê wê şax dide û tê de çêva hûr wekî pincar heye (ew tê avêtin), tama wê tûj e, tê kelandin û xwarin, ji ber tirşî jî çêdikin.

**Ribês**: Derbiharê dertê, di ciyê qumlaxê de mezin dibe, koka wê li ser erdê de pel dide, sapa wê 40 cm. radibe, qaçilê sapê radikin û sapa wê bi xavî tê xwarin (tirkî ışkın).

Hevalên hêja,

Hejmara kovara we ya *Kurmancî* ya duda kete destê min. Mala we ava. Ew rojnama delal dikare kêrî her mirovekî zane jî bê.

Ez jî dixwazim hine bîr û bawerî û serdazêdekirinêd xwe bêjim, belkî we gerek bin. Em ji renga dest pê bikin: Navê renga li bal me ev in:
**Sipî**: çil, qerqaş, sîs, boz (hespê boz), kever, çal

**Reş**: qer, hemis (seyê hemis), qemer, esmer (reşê vekirî)
**Sor**: al, gevez, kumeyt, xanimreng
**Şîn**: hêşîn, kesk
**Sût** : şîrkî, şînboz
**Zer**: qîçik, şê, çûr, kej, çeqel, soron, narincî.
(Çend rengêd din): belek, gewr, qawereng

Têmûrê XELÎL
Rewan-Ermenistana Sovyetî

# Bêjeyên ku cihan nîşan didin

Amadekar : Mûsa KAVAL

1- Navên ku cihekî bi awayekî giştî nîşan didin:

Weke: cih, cî, cîh (li hinek navçan "*cî*", "*cik*" jî dibêjin).

| | |
|---|---|
| - der | - şûn |
| - erd | - dews |
| - avahî | - teng |
| - xanî | - rêç |
| - mal | |
| - war | |
| - şop | |

2- Navên cihan ku bi arîkariya paşpirtikên istan, xane, geh, dank û ok ê tên çêkirin;

**A) ISTAN**
Bi arîkariya istanê navên hinek cihan çêdibin ku li wan cihan bê hijmar ruhber û tişt hene.
Ev cih ji bo wan wek war an welat e.

**Weke:**
Kurd + istan —> Kurdistan
Afxan + istan —> Afxanistan
mor + istan —> moristan
mar + istan —> maristan
gul + istan —> gulistan
dar + istan —> daristan
şehir + istan —> şehiristan
dib + istan —> dibistan

B**) XANE**
Bi arîkariya xaneyê navên cihan çêdibin ku dorgirtî û sergirtî ne.

**Weke:**
derman + xane —> dermanxane
mêvan + xane —> mêvanxane
nexweş + xane —> nexweşxane
mey + xane —> meyxane
girtî + xane —> girtîxane
çay + xane —> çayxane
pirtûk + xane —> pirtûkxane

**C) GEH**
Bi arîkariya gehê jî navên cihan çêdibin.

Weke:
havîn + geh —> havîngeh
seyran + geh —> seyrangeh
kêlan + geh —> kêlangeh
dirûn + geh —> dirûngeh
şer + geh —> şergeh
zanîn + geh —> zanîngeh

**D) DANK**
Bi arîkariya dankê navên wan aletên ku cih in tên çêkirin.
Binyatê dankê dan e û k li ser hatiye zêde kirin ji ber ku ew û rader (mesder)ên lêkerên hevedudanî ji hev bên cihê kirin (weke: avdan, xwêdan)

**Weke:**
xwê + dank —> xwêdank
av + dank —> avdank
kil + dank —> kildank
dew + dank —> dewdank
xwelî + dank —> xwelîdank

**Ok**
Bi arîkariya paşpirtika okê jî navên cihan çêdibin.
Weke:
serşo + k —> serşok
cilşo + k —> cilşok
(Gava rehê gotinê bi o yê biqede oya okê dikeve, k dimîne.)

3-

| | | |
|---|---|---|
| hir | vir | ku cihên nêzîk nîşan didin |
| hê re | vira | |
| hê ve | vê rê | |
| | vê dê | |
| | vê derê | |

| | | |
|---|---|---|
| wir | wê de | ku cihên dûr nîşan didin. |
| wira | wê dê | |
| wê rê | wê derê | |
| | wê ve | |

4- Bêjeyên ku alîyekî ji aliyan nîşan didin.

| | | |
|---|---|---|
| alî | nikar | ba |
| rex | la | |
| kêlek | kenar | |
| mil | cem | dev |
| tenişt | nik | |
| teng | | |

5- Bêjeyên ku hemû aliyan nîşan didin:

| | |
|---|---|
| dor | hawîr |
| dormandor | hawîrdor |
| rexanrex | dorhêl |
| çarnikar | dorûber |
| çarrex | doralî |
| rastûçep | derûber |
| çarkenar | derûdor |
| | çaralî |

hejmar 5 havîn 1989

KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

# Civîna Biskops Arnöyê li Swêdê

Civîna pêncemîn a li ser zaravayê kurmancî li Stockholmê, roja 1ê nîsana 1989an dest pê kir û heta 9ê nîsanê dewam kir.

Hevalên ku di civînê de beşdar bûn ev bûn; Khosrow Abdollahî (Selmas), Rojen Barnas (Diyarbekir), Lutfî Baksî (Xerza), Firat Cewerî (Mardîn), Xelîl Dihokî (Dihok), Mustafa Düzgün (Dersîm), Derwêş M.Ferho (Tor), Musa Kaval (Hekarî), Hazim Kiliç (Hekarî), Asî Rebatî (Sulêmanî), S. Rêwing (Sêrt), Kendal Nezan (Diyarbekir), Huner Salem (Akrê), Mehmed Uzun (Swêrek), Memo Yetkîn (Semsûr) û Reşo Zîlan (Agirî).

Civîn, li gora bernameya xwe, hem li ser pirsgirêkên rêzimanî û hem jî li ser terman xebitî. Herwekî ku hûn dê di rojnamê de bibînin, civîn bi firehî li ser du pirsgirêkên dijwar yên rêzimana kurdî rawesta: lêkerên hevûdudanî û raweya neyînî. Ji bilî van pirsgirêkan, civîn li ser devoka Behdînî jî xebitî. Lê em rapora vê xebatê ku ji aliyê S. Rêving hat pêşkêş kirin, di Kurmancî de naweşînin, ji ber ku ew di kovara Federasyona Kurd li Swêdê Berbangê de (hejmar 4/88) weşiyaye.

Heçî term bin civînê xebata xwe ya li ser anatomiya meriv, peyvên şal û şepik û peyvên ku cih nîşan didin domand û dest bi termên hiqûqî kir. Di beşa «*Ji klasîkên me*» de, vê carê, dor ya şaîrê nemir Seyda Cigerxwîn bû.

Ev xebata ku roj bi roj hin çêtir û tekûztir dibe, îroj bêtir bala xwendevanên kurd dikişîne û ew jî bi pêşniyar û dîtinên xwe, vê xebatê hîn dewlementir dikin. Em her li hêviya pêşniyar û dîtinên xwendevanan in.

KURMANCÎ

# Anatomiya mirov

**(dûmahîka hejmara 3an)**

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| **22-41 BEDEN** | **GÖVDE** | **LE TRONC** | **TRUNK** |
| 22-25 PIŞT | SIRT | LE DOS | BACK |
| 22- mil, serpî, sermil | omuz | l'épaule | shoulder |
| 23- pî | kürek kemiği | l'omoplate | shoulder blade |
| 24- navpişt, kodika piştê | bel | les lombes | loins |
| 25- kortikên qorikê, kortikên kemaxê | kıç çukuru | les fosses lombaires | small of the back |
| 26- binçeng, binkefş | koltuk altı | l'aisselle | armpit |
| 27- pûrtê binçengê, mûyê binçengê, pirça binçengê | koltuk altı kılı | les poils, axillaires | armpit hair |
| **28-30 SÎNG, PÊSÎR** | **GÖĞÜS** | **LE THORAX** | **THORAX (CHEST)** |
| 28-29 memik, çiçik | meme | le sein | Breasts |
| 28- sermemik, gupika memikê | meme ucu | le mamelon | nipple |
| 29- xala memikê | ayla | l'aréole | aréola |
| 30- navçiçik, navmemik, sersîng | göğüs | la poitrine | bosom |
| 31- navteng, newq | bel | la taille | waist |
| 32- kêlek | yan, böğür | le flanc | flank (side) |
| 33- qorik, kemax | kalça | le hanche | hip |
| 34- navik | göbek | le nombril | navel |
| **35-37 ZIK** | **KARIN** | **L'ABDOMEN** (le ventre) | **ABDOMEN** (stomach) |
| 35- serzik | karın üst bölgesi | l'épigastre | upper abdomen |
| 36- til | alt karın | l'hypogastre | abdomen |
| 37- binzik, zikê piçûk | göbek altı | le bas-ventre | lower abdomen |
| 38-berran | kasık | l'ain | groin |
| 39- berzik, rûv, rêv | ferç, etek | le pubis | pudenda (vulva) |
| 40- qûn, gurmik, tilmiqûn | kıç | la fesse | seat (backside, coll, bottom) |
| 41- qelişteka qûnê | kıç yolu | le sillon, inter fessier | anal groove, anal cleft |
| 42- qurmiçka qûnê | kıç kırışığı | le sillon sous fessier | gluteal fold |



| 43-54 ENDAMÊN, LAŞÎ | UZUVLAR, KOL VE BACAKLAR | LES MEMBRES | LIMBS |
|---|---|---|---|
| **43-48 ÇENG, MIL,** ÇEPIL, PÎ | **ÜST UZUV** | **LE MEMBRE SUPERIEUR** | **ARM** |
| 43- bend, pazû | kol | le bras | upper arm |
| 44- qurmiçka enîşkê | dirsek kırışığı | le pli du coude | crook of the arm |
| 45- enîşk | dirsek | le coude | elbow |
| 46- zend, bask, bazend | bilek, alt kol, önkol | l'avant-bras | forearm |
| 47- dest | el | main | hand |
| 48- kulm, mist, | yumruk | le poing | fist (clenched clenched hand) fist,girmist |
| **49-54 LING, QOR** | **BACAK** | **LE MEMBRE INFÉRIEUR** | **LEG** |
| 49- ran, hêt | bud | la cuisse | thigh |
| 50- çok, jinû | diz | le genou | knee |
| 51- binçok, binjinû | diz altı | le creux poplité | popliteal space |
| 52- çîp, çîm | bacak | la jambe | shank |
| 53- paq, baq | baldır | le mollet | calf |
| 54- pê | ayak | le pied | foot |

# Lêkerên hevedudanî

*(verbes composés)*

*Amadekar* : Rojen BARNAS

Di kurmancî de du cur lêker hene ku ya pêşî lêkerên bingehîn in. Lêkerên bingehîn, besît in ku di gewda lêkerê di halê mesderî (infinitif) de perçeyên dîtir wekî navdêr (ism/substantif), rengdêr (sifet/adjectif), hoker (zerf/adverbe), pronav (zemir/pronom), pêrkît (préfix) an parkît (suffix) tune ne. Gewda lêkerê ya di halê mesder (infinitif) de xwerû ye.

Cura diduyan lêkerên hevedudanî (verbes composés) ne, ku gewda lêkerê bi piranî ji lêkerek û ji pêrkîteke xwerû an ji pêrkîteke hevedudanî, ji navdêrekê, ji rengdêrekê, an ji hokerekê pêk tê.

## LÊKERÊN HEVEDUDANÎ YÊN

**A. Tofa Pêşîn**

1. Lêkerên hevedudanî yên ku ji pêrkîteke xwerû û ji lêkerekê pêk tên:

da : dadan, dahatin, daketin, daweşandin, dakirin.
hil : hilanîn, hilavêtin, hilawistin, hildan, hilkirin.
ra : rabûn, rakişandin, rakirin, raxistin.
ve : vebûn, vedan, vejîn, vekirin, vekuştin, veniştin.
vê : vêketin, vêxistin.
we : weşandin.
wer : wergirtin, wergerandin.

2. Lêkerên hevedudanî yên ku ji pêrkîteke hevedudanî û ji lêkerekê çêdibin.

Pêrkîtên hevedudanî

jê = ji + wê/wî
lê = li + wê/wî
pê = bi + wê/wî
tê = di + wê/wî

Herwekî tê dîtinê pêrkîtên hevedudanî ji daçekek û ji pronavek pêk tên.

**LÊKERÊN HEVEDUDANÎ YÊN JI JÊ, LÊ, PÊ, TÊ ÇÊBYÎ:**

jê : jêkirin
lê : lêkirin
pê : pê vedan
tê : têderxistin, têgihandin, têgihîştin, têxistin.

Rastnivisîna lêkerên hevedudanî yên ku bi jê, lê pê û tê çêdibin:

a) Di lêkerên mîna jêkirin, lêkirin, têgihîştin ku pêrkîtên wan hevedudanî ne û di laperandinê de ev pêrkît ji hevûdu nabişifin, divê pêkve bêne nivisandin.
Herwekî:
**lêkirin** (ava kirin, nivîsîn): Min dîwar lêkir.
Min xanî lêkir.
Ez xanî lêdikim.

b) Di lêkerên ku pêrkîtên wan ên hevedudanî di laperandinê de ji hev dibişifin, divê pêrkît ji lêkerê cihê bête nivisandinê.
Herwekî:
**bar lê kirin**: Min barê xwe li kerê kir.

3. Lêkerên hevedudanî yên ji pêrkîteke navdêrî, rengdêrî an hokerî û ji lêkerekê çêdibin.

Pêrkît herçend wek navdêr/rengdêr an hoker xwiyan bike jî, li vê derê erka wê êdî ne navdêrî/rengdêrî an hokerî ye, lêbelê tiqûtenê pêrkîtbûn e. Ji ber hindê pêrkît jêderka wê ji çi cur gotinê hatibe bila were, bi lêkerê ve tê nivisîn.

**P Ê R K Î T A**

| <u>Lêkera hevedudanî</u> | <u>hokerî</u> | <u>navdêrî</u> | <u>rengdêrî</u> | <u>lêker</u> |
|---|---|---|---|---|
| berdan | ber | - | - | + dan |
| berketin* | ber | - | - | + ketin |
| çêbûn | - | - | çê | + bûn |
| çêkirin | - | - | çê | + kirin |
| derkirin | der | - | - | + kirin |
| derxistin | der | - | - | + xistin |
| girêdan | - | girê(k) | - | + dan |
| rêdan | - | rê | - | + dan |
| rêkirin** | - | rê | - | + kirin |
| rokirin | - | ro | - | + kirin |
| rûdan | - | rû | - | + dan |
| rûniştin | - | rû | - | + niştin |

* *berketin* lêkereke hevedudanî ye, bi/li ber ketin biwêjeke (tabîr) lêkerî ye.
** rêkirin lêkereke hevedudanî ye, bi rê kirin biwêjeke lêkerî ye.

Xusûsiyetên laperandina lêkerên vê tofê:

a) Di laperandina zemanên fermanî (imperatif), dahatû (futur), bilaniya bûrî (imparfait du subjonctif) û şertê bûrî (conditionel 1ère forme) de; berlêkera bi-nayê bikaranîn.
Herwekî:
Çêke, rabe, lêxe. Ne ku: Çêbike, rabike, lêbixe.
Ezê çêkim, ezê rabim, ezê lêxim.
Min çêkira, ez rabûma, min lêxista.
Minê çêkira, ezê rabûma, minê lêxista.

b) Berlêkera di- wek qaîdeyek gelemper tê ber koka lêkera eslî.

Herwekî:

**rabûn**

| | | |
|---|---|---|
| gewda lêkerê | : | rabûn |
| pêrkît | : | ra |
| koka lêkerê/ lêkera eslî | : | bûn |
| paşlêker | : | -n |
| rabûn | : | ez radibim, ez radibûm. |
| çêkirin | : | ez çêdikim, min çêdikir. |

Lê wek îstisna li hin navçeyên mîna Bişêriyê, Hevêrkan û Torê ev berlêkera di- di pêşiya gewdê de wekî ku lêkereke xwerû be tê bikaranîn.
Herwekî: dirabim, dirabûm, dilêxim.
c) Di laperandina neyînî (négation) ya lêkerên vê tofê de berlêkerên neyîniyê wekî me-, ma-, ne- dikevine navbera pêrkîtê û lêkera eslî.
Herwekî: Ez ranabim, ez ranedibûm, ezê ranebim, ramebe, bila ranebe.
B. Tofa diduyan
Lêkerên hevedudanî yên vê tofê ji navdêrekê an rengdêrekê û ji lêkerekê pêk tên.
1. Navdêr an rengdêr + lêker:

| | |
|---|---|
| Ava bûn | Ava kirin |
| Hazir bûn | Hazir kirin |
| Pîr bûn | |
| Qaîl bûn | Qaîl kirin |
| Vala bûn | Vala kirin |
| Av dan | |
| Guh dan | |
| Mikur hatin | |
| Rast hatin | |
| Limêj kirin | |
| Nas kirin | |

2. Lêker + navdêr, rengdêr an hoker

Anîn cih
Çûn ava
Dan pey
Ketin pey
Kirin der

Di laperandina (kişandina) teşeyên erînî û neyînî de ya tê laperandine lêker bi xwe ye, perçeyên dinê yên wekî navdêr, rengdêr an hoker nayên laperandinê. Di rastnivîsîna lêkerên hevedudanî de gava lêker bin hêmanên lêkerê ji hevûdu cihê, gava navdêr bin pêkve têne nivîsîn. Herwekî:

| Lêker | navdêr |
|---|---|
| Av dan | avdan |
| Rast hatin | rasthatin |

**BIWÊJÊN (TABÎRÊN) LÊKERÎ** *(locution verbales)*

Biwêjên lêkerî ji hêmaneke lêkerî çi xwerû an hevedudanî û ji çend hêmanên dinê yên nelêkerî pêk tên. Ev hêman wekî pêşdaçek (préposition), paşdaçek (postposition); pronav, rengdêr an jî navdêr in.

ji lêkerên tabîrî çend numûne:

| Biwêja lêkerî | Navdêr |
|---|---|
| Bin av bûn | binavbûn |
| Li hev ketin | lihevketin |
| Bi hev ketin | bihevketin |
| Li ber xwe ketin | liberxweketin |
| Hatin ser xwe | |
| Lê geriyan | lêgerîn |
| Bi rê ketin | birêketin |
| Ji hev danîn | |
| Li ber .......dan | |
| Dev jê berdan | |
| Dest pê kirin | |
| Baweriya xwe (pê) kirin | |
| Bala xwe dan | |
| Ji bîr rakirin | |
| Berê xwe dan | |
| Dnîn ber hev | |

**JI KLASÎKÊN KURDÎ**

# Ferhengoka Dîwana Cegerxwîn

-I-

*Amadekar* : Khosrow ABDOLLAHÎ

*Di çerçewa bernameya xebata li ser afirandinên klasîkên kurdî em di vê hejmara* **Kurmancî** *de ferhengokeke* **Dîwana Cegerxwîn** *belav dikin. Ev ferhengok li ser bingehê Dîwana yekem hatiye pêk anîn. Eslê peyvên ku ne xwerû kurmancî ne di nav kevanekê de hatiye nîsan dan :*

## A

| | |
|---|---|
| **Abidar** *(f.)* | avdar, bi av, pirr bi av; zebeş abidar e; bi av e. |
| **Aheng** | miqam, melodî |
| **An** *(f.)* | ew, ewa |
| **Ap** | mam |
| **Arezû** *(f.)* | daxwaz, xwezî |
| **Asitan** *(f.)* | erd, cîh |
| **Ateş** *(f.)* | agir |
| **Ateşîn** *(f.)* | agirîn, pirr ji agir |
| **Avanî** | avahî |
| **Awaz** | deng, awazê bilûrê:dengê bilûrê |
| **Ayîn** | rêç, dîn; ayînê Kurdan yê berê zerdeştî bû. |

## B

| | |
|---|---|
| **Bad** | ba; bayê havînan pirr gurr nîne. |
| **Badegîr** *(f.)* | meygir |
| **Balafir** | firoke, teyare |
| **Barî** | Xwedê, Barî Teala, *(e.)* xwedêyê mezin |
| **Bazîn** | bezîn |
| **Başok** | épervier *(fr.)* |
| **Bedgo** | (bed gotin), pîsî-bêj, dev-pîs |
| **Bedxwaz** | xêrnexwaz, pîsîxwaz |
| **Bêgan** | bêgane: biyanî |
| **Behîv** | badem *(f.)*, amande *(fr.)* |
| **Behmen** | 1) navê yekemîn Şahê bine-mala keyaniyan, 2) navê firişteyekê ye di dînê zerdeştî de. |
| **Behram** | 1) navê serdarekî pirr bi nav û deng ê zemanê Hormozê Çaharan şahê Sasaniyan e. 2) navê stêrkekê ye 3) navê firişteyeyekê ye di dînê zerdeştî de. |
| **Benc** | beng, giyayê bengê |
| **Bende** | kole, |
| **Ber** | hasil, ber birin serî: hasil kirin |
| **Ber** | kevir; di ser me de ber dibarin: di ser me kevir dibarin |
| **Berbadî çûn** | berbad bûn, ji dest çûn |
| **Berberî** | îxtîlaf, duberekî |
| **Beyaban, biyaban** | çol |
| **Beşt** | kêran |
| **Bêmirês** | bê mirûz, bê sikûm |
| **Bênîn** | bîn kirin, gulê bibênin : gulê bîn bikin |
| **Bêserî** | bê xwendan, bê serok û bê rehber |
| **Bêş** | 1) bac: filan kes hate bêş kirin : bac ji wî hate stendin, 2) maliyat, filan kesê bêşa xwe daye : filan kesê maliyata xwe daye. |
| **Bi hezar rengî** | bi hezar awayî |
| **Bihuşt** | bêhişt, cinnet *(e.)* |
| **Bijarte** | élite *(fr.)* |

*(e.)* : erebî ; *(f.)* : farisî ; *(fr.)* : fransizî ; *(t.)* : tirkî

**Bil** xeynî, ji bil we: ji xeynî we
**Bin-den** şeraba binê kûp, den: kûp
**Bosîn** maç kirin

## C

**Cam** *(f.)* **qedeh** *(e.)* piyana mey vexwarinê ye.
**Canbazî** can fida kirin, can gorî kirin
**Cejne-rojî** cejna rojîtiyê, cejna remezanê
**Ceng** şer
**Cengebazî** şer û oxilme, şerê bi deng û feng
**Ceres** *(e.)* zengil
**Cewcam** *(e.)* zarok
**Cewdik** meşkeke piçûk e ji bo avê
**Cihangîr** cihangir
**Cihok, ciw** coya avê
**Ciwanmêr** comerd, camêr
**Coş** *(f.)* kel, av coş hatî : av keliyayî

## Ç

**Çal** bîr, çala avê, çala genim
**Çalak** jîr, jêhatî
**Çeleng** jêhatî, jîr
**Çendan** hewqas, ew çendan rê çû heya westiya: ew hewqasî rê çû...
**Çeng** *(f.)* harp, haletekî mûsiqiyê ye
**Çengal, çengel** çetel
**Çeşm** *(f.)* çav
**Çikûs** dest girtî, mirovekî çekûs : mirovekî dest girtî: dest nevekirî
**Çirax** *(f.)* çira
**Çogan** çel, hol

## D

**Daberizîn** êriş kirin, hemle kirin
**Dafik** kemîn, ew kete dafikê : ew kete kemînê
**Dahî** *(e.)* pirr jîr, jêhatî
**Dehen** *(f.)* dev
**Dewa** *(f.)* derman
**Deşnam** *(f.)* cinêw, çêr, deşnam dayîn, cinêw dayîn
**Dilawer** mêrxas
**Dilxurt** bi tehemûl
**Difr, difre** xurûr
**Dixan** *(e.)* dûkel
**Diyar** *(e.)* cîh, war
**Dîbace** *(f.)* pêşgotin
**Dîdar** dîtin
**Dîden** *(f.)* dîtin
**Direfş** *(f.)* ala
**Dot** keç; dotmam : keçmam
**Duzex** dojeh : doje : cihennem
**Dûd** *(f.)* dû, dûkel

## E

**Ebrû - qezeh** birû kevan
**Ebrû** birû
**Ehremen, ehrîmen** Xwedê yê nebaşî û pîsiyê
**Ehûramezda** Xwedê yê başiyê û qenciyê
**Ejder** 1) marekî mezinî efsaneyî ye ku agir ji devê wî derdiket,
**Em** ev, eva
**Emro** îro
**Enguşt** *(f.)* tilî
**Engûr** *(f.)* tirî
**Enîroj** eniya wê wekî rojê
**Erdeşêr, Erdeşîr** yekemîn Şahê Xanedana Sasaniyan
**Erjen** navê yekek ji pirtûkên Manî ê pêxember e ku wênekeşekî bi nav û deng bû jî.
**Erqem** *(e.)* çîn, neqş
**Erx** co, kanal
**Evor** heywanê nêçîrê, gibier *(fr.)*
**Eyran** Îran, navê îranê yê kewn

## F

**Fehetkar** fedîkar, şermezar
**Felat** rizgarî
**Ferfûr** porselen
**Ferzîn** wezîr e di leyistoka Şetrencê de
**Fexregah** *(e.)* cîhê ku mirov pê fexrê dike
**Feryad** *(f.)* qîrîn
**Firengî** ewropayî
**Firing** Ewrûpa
**Fixan** *(f.)* qîrîn
**Fort** pesn; fortan di xwe dan: pesnê xwe dan; vantardise *(fr.)*

## G

**Geda** parsek
**Gedek** kurr
**Gerdenxwar** stûxwar
**Gerdûn** asiman, kainat *(e.)*
**Gerdûş** 1) geran: ew çûye gerdûşê: çûye geranê, 2) zivirîn, asiman di gerdûşê de ye: di zivirînê de ye.
**Germesûk** qumaşê kêm qîmet, kincir
**Gêş** ref, komik
**Girbêj** bêjinga bi qulên girtir
**Guft** gotin, axavtin
**Guftego** *(s.)* diyalog
**Guhreş** Kûroş *(f.)*, Şahekî bi nav û deng ji xanedana Hexamenişî ku di 559-530 pêş mîladê li Îranê hukum kiriye Cyrus le Grand *(fr.)*
**Gulşen** gulzar
**Guzar** geşt û seyran

## H

**Heçî** darekî du çiqile (Y) ku dixin serê werîs de
**Hemdem** heval
**Hemnişîn** *(f.)* hemdem
**Hêl, hêle** nêçîra bi grûpî; battue *(fr.)*

## J

**Jan** êş, derd

## K

**Kamiran** *(f.)* xweşbext
**Kaxik** vazoya kulîlkan, pôt *(fr.)* aux fleurs, vase *(fr.)*
**Kaşo** darê gogê
**Kerkere** nezan, tênegihîştî
**Kelax** îskelet, squelette *(fr.)*
**Kelbeş** kerbeş
**Keleş** rêbirr, eşqiya
**Kelxot** bê didan, kesekî ku didanên wî ketine
**Kenişt** *(f.)* dêra cihûyan, sînagog
**Kepez** cîhê bi gir û girik
**Kerx** westiyayî, bê hêz, ji hêz ketî
**Key** keybir, kêreke mezin
**Kêşim** bejn û bal
**Kiçik** piçûk
**Kîrgo** kêroşk
**Kopal** gurz
**Kuca** *(f.)* kuder, kîjan der
**Kulek** yê ku dikule
**Kûp û bel** bandêva çiyê; pic de montagne *(fr.)*

## L

**Lacerem** *(e.)* bi neçarî
**Laf** pesnê xwe dan, fort
**Lakin** *(e.)* lê
**Leb** *(f.)* lêv
**Lebaleb** *(f.)* tijî, limlimî
**Lem'an** *(e.)* pêt, alav
**Lîs** ciyê ku çûk û teyr xwe lê datînin; perchoire *(fr.)*

## M

**Mader** *(f.)* dê, dayik
**Mah** *(f.)* hîv
**Mahweş** *(f.)* mah - hîv, weş wekî, mahweş wek hîvê
**Manend** *(f.)* wekî
**Marmij** 1) yê ku jehra mar dimije, 2)kesê bê wijdan kedxurî dike, xelkê dişêlîne.
**Matem** *(f.)* şîn, reş, matem girtin, reş girtin
**Max** kêran, 1) traverse, poutre (f.r), 2) ode
**Medhoş, medhûş** *(f.)* bê hiş ketî, ji xwe ve çûyî, medhoş bûn: ji xwe ve çûyîn
**Mend** kas bûn, ji hêz ketin
**Merdane** bi mêrxasî, bi camêrî
**Merdî** camêrî
**Mersef** sinî
**Mestane** *(f.)* bi serxwoşî

| | |
|---|---|
| **Meyger** | kesê ku di meyxanê de meyê di gerîne, saqî |
| **Meyza kirin** | mêze kirin, nêrîn |
| **Mêlak** | kezeb (kezev) |
| **Mijde** *(f.)* | mizgînî |
| **Mirdal** | mirdar |
| **Mirdû** *(s.)* | mirî |
| **Miskar** | kaniya ava madenî |
| **Mitêl, mitîl** | lihêf |
| **Mîtan** | mîntan, kiras |
| **Moxil** | cureyek bêjingê |
| **Murx** *(f.)* | mirîşk, teyr, murxê bazî, teyrê bazî |
| **Muxbeçe** | zarokên ku di zemanê berê de di meyxanan de meygirî dikirin. |
| **Mûdî** | şûm, bedyûm |

## N

| | |
|---|---|
| **Nagah** *(f.)* | nişkave |
| **Nagehan** *(f.)* | nişkave |
| **Namidar** *(f.)* | navdar, bi nav û deng |
| **Naqos** *(e.)* | zengil |
| **Nasazî** | nesazî |
| **Nasufte** *(f.)* | qul nekirî |
| **Naşor** | perçeyê ji rîsê zirav |
| **Nebîrbir** | kure-fem |
| **Nemerd** | bêbext, ne camêr |
| **Nepax** | pifik an tifik a hesinkeran, soufflet *(fr.)*, |
| **Nermî** | musamaba, tolerance *(fr.)* |
| **Nêrdewan** | derence, pêlekan |
| **Nêrîz** | cureke xencer |
| **Nihan** | nihên, veşartî |
| **Nijdevan** | rêbirr, rêgir |
| **Nik** | cem, ba, nik min: cem min, ba; min |
| **Nuxwurî, nûxwirî** | zaroyê yekemîn |

## P

| | |
|---|---|
| **Paketeb'** *(k+e.)* | pak+teb': paqij tînet |
| **Pare** *(f.)* | pirtî, pare pare bûn, pirtî pirtî bûn |
| **Pargon, pargûn** | coyeke piçûk e ku li dora kon, çadir an her tiştekî din vedidin, ji bo ku ava baranê neçe hindur. |
| **Parsek** | kesê ku parsê dike |
| **Parsîw** | parsû |
| **Paye** | derece, paya mamostatiyê |
| **Pehlewan** | mirovekî pirr xurt û bi qewat |
| **Perwane, pervane** *(f.)* | minminîk, pepûle, pirpirok |
| **Perwa** | tirs; bê perwa: bê tirs, bê minet |
| **Pesendîde** *(f.)* | baş, bijartî |
| **Peyam** *(f.)* | mesaj, wilam |
| **Peyk** *(f.)* | qasid |
| **Pêlek** | demek, qasek |
| **Pêrgî** | berve çûn; ez çûbûm pêrgîya wî: ez ber wî ve çûbûm. |
| **Pêtazî** | pêxas |
| **Pêyxam** *(f.)* | mesaj |
| **Pêşrew** | pêşeng |
| **Pişkoj** | hebin, bendê ku davêjin serê sing û bi wî kon girêdidin |
| **Polad** | pola |
| **Pûtxane** | cîhê pûtan |

## Q

| | |
|---|---|
| **Qad** | meydan, cih, erd |
| **Qadûk** | beroşeke piçûk |
| **Qed û qamet** *(e.)* | bejn û bal |
| **Qend** | şekir |
| **Qeraş** | aşvan |
| **Qerij** | qirêj, gemar |
| **Qerpal** | 1) cilên kevn û ji hev ketî, 2) li ser hev û din de kom-bûn û kevnare bûn |
| **Qerqef** | surahî, cama şerabê |
| **Qewî** *(e.)* | xurt, qewîn |
| **Qews û qezeh** *(e.)* | keskesor |
| **Qirak** | qijika reş |
| **Qunbere, Qurix** | stêrkeke ku durust di nîveka havînê de der dikeve û pirr jî bi şemal e. |
| **Qutb** *(e.)* | serok, ji hemûyan mezintir |

## R

| | |
|---|---|
| **Rastgo** | rastbêj |
| **Raz** *(f.)* | sirr |
| **Reftar** *(f.)* | tevger, helwest |
| **Reg** | reh, bê reg: bê reh |
| **Rencber, rêncber** | zehmetkêş, emekdar |
| **Rewa** | cayiz |
| **Rêberî** | rehberî |
| **Ritbe** *(e.)* | derece, paye |
| **Rîp** | fêl, hîle |
| **Robar** | çem |
| **Rojcebîn** *(k+e.)* | enî ya wê wekî rojê ye |
| **Rux** *(f.)* | rû |
| **Ruxsar** *(f.)* | rû, sûret |
| **Rûmah** *(f.)* | rûyê wê wekî hîvê ye |
| **Rûnpêj** | tawe, miqilik, rûnbirêşk |
| **Rûro, rûroj** | ruyê wê wekî kilora rojê ye |
| **Rûsiyahî** *(f.)* | rûreşî |

## S

| | |
|---|---|
| **Sade** | hêsan, hêsayî, besît |
| **Sahibqiran** *(e.)* | hukumdarê mezin |
| **Sehergahan** *(f.)* | bi wextê serê sibê |
| **Sehrebaz** | sêrbaz, cadûbaz |
| **Senc** | strî yên dara sincê |
| **Seng** *(f.)* | kevir |
| **Serenguşt** *(f.)* | serê tiliyê |
| **Serheng** *(f.)* | mîralay; colonél *(fr.)* |
| **Sersal û nûroj** | newroz |
| **Serdar** | serok; généralissime *(fr.)* |
| **Serşok** | cîhê ku mirov têde serê xwe dişo, banyo *(fr.)* |
| **Seza** | şerm, e'yb, nebaş, ji bo we pirr seza ye: ji bo we pirr şerm e |
| **Sêwî** | êtîm, belengaz, bêxwedan |
| **Siyehgûnpoş** *(f.)* | wekî reş li xwe kirî |
| **Sifirne** | sîvander |
| **Sikke** *(e.)* | polik |
| **Siyah** *(f.)* | reş |
| **Siyahçerd** *(f.)* | reşolekî |
| **Sîma** *(f.)* | rû, sûret |
| **Sîwak** *(e.)* | miswaka erebî ku hecî ji hecê tînin û pê didanên xwe paqij dikin |
| **Stêle** | beradayî |
| **Surşirîn** | dilrevîn |
| **Suxen** *(f.)* | peyv, axavtin |
| **Sûxte** *(f.)* | şewitî (ji derdan) |

## Ş

| | |
|---|---|
| **Şadî** | şahî |
| **Şanî dan** | nîşan dan |
| **Şax** *(s.)* | çiya |
| **Şeb** *(f.)* | şev |
| **Şebnem** *(f.)* | xunav |
| **Şecaet** *(e.)* | dilêrî, mêrxasî |
| **Şek** | derb, şekek lê da, derbek lê da |
| **Şekeramîz** *(f.)* | şekirdar |
| **Şel** | şil, nexweşiya şilbûnê |
| **Şekerxend** *(f.)* | şekir ken |
| **Şewişîn** | muwazena xwe winda kirin, perdre l'équilibre *(fr.)* |
| **Şewq û tereb** *(e.)* | şahî û xweşî |
| **Şext** | şexte, perçe perçe bûn |
| **Şeyda** *(f.)* | bê tewat, evîndar |
| **Şeyl** *(e.)* | hal û hereket |
| **Şêrîn** | dengê kewê nêr gava ku dixwîne |
| **Şêt** *(s.)* | dîn; şêt bûn: dîn bûn |
| **Şikêr** | kevirên gir ên li ser hev di çiyan de |

## T

| | |
|---|---|
| **Tar** | tarî |
| **Tazî** *(f.)* | ereb |
| **Taçîk** | tacîk, faris |
| **Tebeqe** *(e.)* | qat |
| **Tebîb** *(e.)* | doxtor, bijîşk |
| **Teblîx** *(e.)* | reklam, nasandin |
| **Telebkar** *(e.+k.)* | deynxwaz |
| **Temezî** | sermala rengîn a ku keç û jin li dora kofiya xwe dialînin an dialandin |
| **Ten** | beden, laşê mirov |
| **Tenha** | tenê, bi tenê |
| **Terbûş** *(e.)* | şaşik |
| **Terş** | heywanên kedî kirî |
| **Terx** | bê qusûr, bê 'eyb |
| **Tewizîn** | têk çûn |
| **Text û pa** | hukum, seltenet |
| **Teylesan** *(e.)* | 1) şaşika dora kumê melan, 2) xirx |
| **Têrmal** | zengîn, dewlemend |
| **Tifaq** *(e.)* | hevgirtin, yekîtî |
| **Tiral** | tembel |
| **Tîx** *(f.)* | keybir, teraşa (cilêta) ku mirov pê rihê xwe diteraşe |

| | |
|---|---|
| **Tog** | bêheya, effrontée *(fr.)* |
| **Tol** | jina daw ne paqij, jina doxîn sist |
| **Tor û tey** | tim û tim |
| **Torîk** | çeqel; chacal *(fr.)* |
| **Tûre, torre** *(e.)* | bisk, serê biskan |

### V

| | |
|---|---|
| **Vebestin** | careke din girêdan |
| **Vejîn, vejiyan** | vejiyandin, careke din zindî bûn an zindî kirin |
| **Vewestan** | rawestan |
| **Vîn** | evîn |

### W

| | |
|---|---|
| **Waris** *(e.)* | mîratxwer |
| **Wer** | eger, heke |

### X

| | |
|---|---|
| **Xak** | ax; xaka Kurdistan: axa Kurdistan |
| **Xaltîk** | xatî, xûşka dayika mirov |
| **Xame** *(f.)* | qelem, pênûs |
| **Xan û sera** | koşk û qesr |
| **Xap** | xapîn, fêl |
| **Xedeng** | tîreke rast û dirêj ku ji dara gezê dihate çêkirin |
| **Xerîdar** *(f.)* | muşterî, kiriyar |
| **Xeste** *(f.)* | 1) nexweş, 2) westiyayî |
| **Xezan** *(f.)* | payîz |
| **Xeşm** *(f.)* | hêrs, pertî; brutalité *(fr.)* |
| **Xişt** | zeng, şîşa ku serê wê tûj e |
| **Xol** | xwelî |
| **Xubar, Ẍubar** *(f.)* | toz |
| **Xuda** | Xwedê |
| **Xumpare** *(f.)* | mêrkuj; meurtier *(fr.)* |
| **Xurd** *(f.)* | xwarin |
| **Xurşîd** *(f.)* | tav, hetav |
| **Xwedan** | Xwedî, xweyî, sahib |
| **Xweser** | 1) otoriter (fr.), despot *(fr.)* 2) otonom |
| **Xweserî** | 1) otorîtarîzm,despotîzm *(fr.)*, 2) otonomî *(f.)* |
| **Xweşnewaz** *(f.)* | xweş aheng |

### Ẍ

| | |
|---|---|
| **Ẍed-dar** *(e.)* | zordar, stemkar |
| **Ẍemhilgir** *(e.+k.)* | kesekî ku xema kesên din dixwe an dikişine |
| **Ẍemze** *(e.)* | 1) bijang, 2) naz û tîz |
| **Ẍemzerim** *(e.+k.)* | bijangrim, bijang wekî rimê |
| **Ẍerîq** *(e.)* | xeniqî |
| **Ẍezeb** *(e.)* | hêrs, bela |
| **Ẍunce, Ẍunçe** *(f.)* | bişkoja gulê |

### Y

| | |
|---|---|
| **Yadigar** *(f.)* | diyarî |
| **Yar** | heval, dost |
| **Yekser** | hemû, pêkve, têkre |
| **Yeksû** *(f.)* | 1)yekalî, 2) wekhev |
| **Yeẍma, yexma** *(f.)* | talan, yexma kirin, talan kirin |
| **Yexsîr** | dîl, êsîr |
| **Yezd Gurd** | şahek ji şahên xanedana Sasaniyan |
| **Yezdan** | xwedê di dînê Mezdayî de |

### Z

| | |
|---|---|
| **Zaẍ** *(f.)* | qijika reş |
| **Zehr** *(e.)* | gul |
| **Zehr** *(f.)* | jehr, jar |
| **Zendî** | zindî, zindû, jîndar |
| **Zinnar** *(e.)* | kemerbend |
| **Zingar** | jeng |
| **Zuhd** *(e.)* | xwe parêziya dînî |

# Ji pirsgirêkên rêzimanî
# Raweya neyînî

*Amadekar*: Reşo ZÎLAN

Di zaravayê kurmancî de raweya neyînî ya perçeyên axaftinê yên wek bernav, rengdêr, hoker, daçek, navdêr, gihanek, baneşan û hwd bi alîkariya pirtika neyînî ya ne-yê têne çêkirin. Di rewşên holê de pirtika ne-yê serbixwe ye, cihê û bi tena serê xwe tête nivîsîn. Di raweya neyîniyê de pirtika ne-yê her tim tête pêşiya parçeya axaftinê ya ku divê bête neyînî kirin. Bo nimûne:

| <u>Raweya erînî</u> | <u>Raweya neyînî</u> |
|---|---|
| Yê ku ew gotiye, ez im. | Yê ku ew gotiye, ne ez im |
| Av sar e. | Av ne sar e. |
| Ma tu sibehî diçî gund? | Ne sibehî, lê dusibehî. |
| Ev diyariya ji bo min e? | Na, ew ne ji bo te ye. |
| Ew zeviya han zeviya Dara ye. | Ew zevî ne zeviya Dara ye. |
| Zîzê weke te kej e. | Zîzê ne weke min, lê weke Fodilê kej e. |
| Lo, lo! | Ne lo lo, lê lê! |

**Awarte:** Di hin devokên kurmancî de, di rex vî awayê han yê jorîn de, awayekî din yê raweya neyînî jî heye. Heçî ew rawe ye, herwekî hin zaravayên din yên kurdî, bi alîkariya nînê ve tête çêkirin. Ev gelek caran yan hema bi dû rengdêr, hoker, daçek, navdêr, gihanek, baneşan û hwd re têt yan jî diçe dawiya hevokê. Herwekî pirtika ne-yê, nîne jî peyveke serbixwe ye û cihê û bi tena serê xwe têtê nivîsîn. Bo nimûne:

Lîloz ew nîne.
Av sar nîne.
Ew zevî zeviya Dara nîne.
Lo lo nîne, lêlê ye!
Na, ew ji bo te nîne.
Rojbûna min sibehî nîne, dusibehî ye.
Ew bi şekir nîne.

Lê herwekî emê piştre jî çêl bikin, nîne bi xwe raweya neyînî ya hebûnê ye, ango: nînbûn, tunebûn. Ji lewre jî ew li gor bernavan têtê tewandin.

Neyîniya bi vî awayî, hem di zimanê axaftinê û hem jî bi teybetî di zimanê nivîsandinê de hin tevlihevî û aloziyan tîne pêş. Bo nimûne, heke Kurmancek ji hêla bakurê Kurdistanê bibêje «Konê min nîne.» dê Kurmancek ji hêla Botan, Toriyan, Behdînan û hwd welê têbigihê, ku ew dibêje «Min kon nîne.» ango «Konê min tune ye.».

Ji ber vê têkilhevî û aloziyê, divê em hewil bidin da ku bi kêmanî di zimanê nivîsandinê de vê forma han ya neyîniyê nehête bi kar anîn.

## RAWEYA NEYÎNÎ YA LÊKERA «BÛN»ê

### A. Dema niha

Herwekî ku li jorê jî diyar dibe, pirtika neyînî ya ne-yê her tim têtê pêşiya perçeyên axaftinê yên têvel. Ew her dîsan serbixwe ye. Di hevokan de,

cihê û bi tena serê xwe ye û wilo jî tête nivisîn. Ew li gor bernavan nahête tewandin. Lê herwekî ku li jêrê jî dixuyê, guhartoya devokî her tim li gor bernavan têtе tewandin. Di pêkhatineke weha de êdî ew rola lêkereke neyînîkiri dilîze. Wek:

1. Li gor qaideya **bêdeng** - d**engdar** - **bêdeng** (B+D+B):

| Raweya erînî | Raweya neyînî | Guhartoya devokî |
|---|---|---|
| Ez cotkar im. | Ez ne cotkar im. | Ez cotkar nînim. |
| Tu şagirt î. | Tu ne şagirt î. | Tu şagirt nînî. |
| Ew gavan e. | Ew ne gavan e. | Ew gavan nîne. |
| Em Kurd in. | Em ne Kurd in. | Em Kurd nînin. |
| Hûn sazbend in. | Hûn ne sazbend in. | Hûn sazbend nînin. |
| Ew çûk in. | Ew ne çûk in. | Ew çûk nînin. |

2. Li gor qaîdeya **dengdar** - **bêdeng** - **dengdar** (D+B+D):

| | | |
|---|---|---|
| Ez gundî me. | Ez ne gundî me. | Ez gundî nînim. |
| Tu bajarî yî. | Tu ne bajarî yî. | Tu bajarî nînî. |
| Ew rovî ye. | Ew ne rovî ye. | Ew rovî nîne. |
| Em zane ne. | Em ne zane ne. | Em zane nînin. |
| Hûn akincî ne. | Hûn ne akincî ne. | Hûn akincî nînin. |
| Ew çiyayî ne. | Ew ne çiyayî ne. | Ew çiyayî nînin. |

Carina hin kes, gava ku forma guhartoya devokî bi kar tînin, wê lêkera tewandî ji hev vediqetînin û wek lêkereke hevedudanî, cihê dinivîsin. Bo nimûne:

| 1. Li gor qaîdeya **B+D+B** | 2. Li gor qeîdeya **D+B+D** |
|---|---|
| Ez cotkar nîn im. | Ez gundî nîn im. |
| Tu şagirt nîn î. | Tu bajarî nîn î. |
| Ew gavan nîn e. | Ew rovî nîn e. |
| Em Kurd nîn in. | Em zane nîn in. |
| Hûn sazbend nîn in. | Hûn akincî nîn in. |
| Ew çûk nîn in. | Ew çiyayî nîn in. |

Heçî pirtika *im*, *î*, *e*, û *in* e, mirov dizane ew tewangên lêkera *bûn*-ê ne. Lê heçî pirtika *nîn* e, wek xuya ye, rola pirtika neyîniyê dilîze. Lê bele herwekî ku jê jî darî çav dibe, di guhartoya devokî ya neyîniyê de qaîdeya «D+B+D» derbas nabe. Ango lêkera *bûn*-ê li gor dengdarê berî xwe, yê ku di hevokê de, pêwîstî tewandinê nabe. Ji ber ku nîne bi bêdeng dest pê dike, tewanga lêkera bûnê jî, her li gor qaîdeya «B+D+B»-yê dimîne.

Eşkere ye, ku nîne ji «nebûn»ê têt. Ji nebûnê re, di hin devokên kurmancî de, dibêjin nînbûn... Her çi be, heke ev forma han carina ji ber neçariyê bête bi kar anîn jî, divê pirtika nîn-ê bi lêkera bûn-ê ve bête nivîsîn.

## DI DEMÊN LÊKERAN DE RASTNIVÎSÎNA NEYÎNIYÊ

### B. Dema pêş

| Raweya erînî | Raweya neyînî | Guhartoya devokî |
|---|---|---|
| Ez ê bibim. | Ez ê nebim. | Ez ê nînbim. |
| Tu ê bibî. | Tu ê nebî. | Tu ê nînbî. |
| Ew ê bibe. | Ew ê nebe. | Ew ê nînbe. |
| Em ê bibin. | Em ê nebin. | Em ê nînbin. |
| Hûn ê bibin. | Hûn ê nebin. | Hûn ê nînbin. |
| Ew ê bibin. | Ew ê nebin. | Ew ê nebin. |

Li vir, pirsa sereke ya ku ji aliyê rastnivîsînê de derdikeve pêşiya me, ew e: aya em ê pirtika NE-yê, wek li jorê, di gel lêkerê, pêkve binivîsin? Yan divê em wê, wek li jêrê, cihê û bi tena serê xwe binivîsin? Ango:

Ez ê ne bim.
Tu ê ne bî.
Ew ê ne be.
Em ê ne bin.
Hûn ê ne bin.
Ew ê ne bin.

**Têbînî**: Herçendî ji aliyê pêkhatina zimanê kurdî de cihê nivîsandina vê pirtikê rastir be jî, ku piraniya zimanên hindoewrûpî welê dinivîsin, di pêk ve nivîsandinê de feyde bêtir e. Sûd û feydeya herî mezin, bê guman ya pedagojîk e. Pêkve nivîsandina pirtika neyîniyê hem di nivîsandin û xwandin, hem di bilêvkirin û hem jî di hînkirinê de hêsanî kû gengaziyên gelekî mezin derdixîne.

### C. Dema boriya berdest

| | Raweya erînî | Raweya neyînî |
|---|---|---|
| | Ez dibûm | nedibûm |
| | Tu dibûyî | nedibûyî |
| | Ew dibû | nedibû |
| | Em/Hûn/Ew dibûn | nedibûn |
| **D. Dema boriya têdeyî** | | |
| | Ez bûm | nebûm |
| | Tu bûyî | nebûyî |
| | Ew bû | nebû |
| | Em/Hûn/Ew bûn | nebûn |
| **E. Dema boriya çîrokî** | | |
| | Ez bûbûm | nebûbûm |
| | Tu bûbûyî | nebûbûyî |
| | Ew bûbû | nebûbû |
| | Em/Hûn/Ew bûbûn | nebûbûn |
| **F. Dema boriya dûdar/sade** | | |
| | Ez bûme | nebûme |
| | Tu bûyî | nebûyî |
| | Ew bûye | nebûye |
| | Em/Hûn/Ew bûne | nebûne |
| **G. a) Reweya hekînî: Dema borî I** | | |
| | Ez bûma | nebûma |
| | Tu bûya(yî) | nebûya(yî) |
| | Ew bûya | nebûya |
| | Em/Hûn/Ew bûna | nebûna |
| **G. b) Dema borî II** | | |
| | Ez ê bibûma | ê nebûma |
| | Tu ê bibûya(yî) | ênebibûya(yî) |
| | Ew ê bibûya | ê nebibûya |
| | Em/Hûn/Ew bibûna | ê nebibûna |
| **H. a) Raweya bilanî: Boriya berdest.** | | |
| | Ez bûbiwam | ne bûbiwam |
| | Tu bûbiwa | ne bûbiwa |
| | Ew bûbiwa | nebûbiwa |
| | Em/Hûn/Ew bûbiwan | nebûbiwan |
| **H. b) Dema niha û pêş I** | | |
| | Ez bibim | nebim |
| | Tu bibî | nebî |
| | Ew bibe | nebe |
| | Em/Hûn/Ew bibin | nebin |
| **H. c) Dema niha û pêş II** | | |
| | Ku ez bim | nebim |
| | Ku tu bî | nebî |
| | Ku ew be | nebe |
| | Ku em/Hûn/Ew bin | nebin |

**1. Raweya fermanî**

a) Yekhejmar

| | |
|---|---|
| Bibe! (be!) | nebe ! |
| | mebe ! |

b) Pirhejmar

| | |
|---|---|
| Bibin! (bin!) | nebin ! |
| | mebin ! |

**Têbînî**: Di zaravayê kurmancî de du cure raweya fermanî hene. Yek ji wan bi alîkariya pirtika me-yê tête çêkirin, ya din jî bi alîkariya pirtika ne-yê. Ferqa di navbera wan de ev e: «ME» her tim ferman e û fermaneke misoger e. Lê di ne-yê de tawsiye heye. Mixa bin, ku îro li ba hin Kurmancan me bi temamî asîmîle bûye û di şûna wê de bi tenê ne û forma bi wê tête çêkirin, maye.

## LÊKERA «HEBÛN»-Ê

### A. Dema niha

| Raweya erînî | Raweya neyînî | Lêkera alternatîv |
|---|---|---|
| Min heye | min nîne | ... min tune |
| Te heye | te nîne | ... te tune |
| Wî/Wê heye | wî/wê nîne | ... wî/wê tune |
| Me/We/Wan heye | me/we/wan nîne | ... me/we/wan tune |

### B. Dema pêş

| | | |
|---|---|---|
| Min dê hebe | min dê nînbe | ... min dê tune be |
| Te dê hebe | te dê nînbe | ... te dê tune be |

### C. Dema boriya têdayî

| | | |
|---|---|---|
| Min hebû | min nebû | ... min tune bû |
| Te hebû | te nebû | ... te tune bû |

### D. Dema boriya çîrokî

| | | |
|---|---|---|
| Min hebû | min nebû | ... min tune bû |
| Te hebû | te nebû | ... te tune bû |

### E. Dema boriya dûdar

| | | |
|---|---|---|
| Min hebûye | min nebûye | ... min tune bûye |
| Te hebûye | te nebûye | ... te tune ye |

### F. a) Raweya hekînî; dema borî I

| | | |
|---|---|---|
| Min hebiwa | min nebiwa | ... min tune bûya |
| Te hebiwa | te nebiwa | ... te tune bûya |

### F. b) Dema borî II

| | | |
|---|---|---|
| Min dê hebiwa | min dê nebiwa | ... min dê tune bûya |
| Te dê hebiwa | te dê nebiwa | ... te de tune bûya |

### G. a) Raweya bilanî; boriya berdest

| | | |
|---|---|---|
| Min hebe | min nînbe | ... tune be |
| Te hebe | te nînbe | ... tune be |

### G. b) Dema niha

| | | |
|---|---|---|
| Min hebe | min nînbe | ... min tune be |
| Te hebe | te nînbe | ... te tune be |

### H. Raweya fermanî

| | |
|---|---|
| Hebe! | Mebe! |
| Hebin! | Mebin! |

## LÊKERA «HEYÎN»Ê

**A. Dema niha**

| Raweya erînî | Raweya neyînî |
|---|---|
| Ez heme | tune me |
| Tu heyî | tune yî |
| Ew heye | tune ye |
| Em/Hûn/Ew hene | tune ne |

**B. Dema boriya têdayî**

| | |
|---|---|
| Ez hebûm | tune bûm |
| Tu hebûyî | tune bûyî |
| Ew hebû | tune bû |
| Em/Hûn/Ew hebûn | tune bûn |

**C. Dema boriya dûdar**

| | |
|---|---|
| Ez hebûme | tune bûme |
| Tu hebûyî | tune bûyî |
| Ew hebûye | tune bûye |
| Em/Hûn/Ew hebûne | tune bûne |

**D. Boriya çîrokî**

| | |
|---|---|
| Ez hebûm | tune bûm |
| Tu hebûyî | tune bûyî |
| Ew hebû | tune bû |
| Em/Hûn/Ew hebûn | tune bûn |

**E. Dema pêş**

| | |
|---|---|
| Ez dê hebim | dê tune bim |
| Tu dê hebî | dê tune bî |
| Ew dê hebe | dê tune be |
| Em/Hûn/Ew hebin | dê tune bin |

**F. a) Reweya hekînî; dema borî I**

| | |
|---|---|
| Ez hebûma | tune bûma |
| Tu hebûyayî | tune bûyayî |
| Ew hebûya | tune bûya |
| Em/Hûn/Ew hebûna | tune bûna |

**F. b) Dema borî II**

| | |
|---|---|
| Ez dê hebûma | dê tune bûma |
| Tu dê hebûyayî | dê tune bûyayî |
| Ew dê hebûya | dê tune bûya |
| Em/Hûn/Ew hebûna | dê tune bûna |

**G. a) Raweya bilanî; Boriya berdest**

| | |
|---|---|
| Ez hebûbiwam | tune biwam |
| Tu hebûbiwa | tune biwa |
| Ew hebûbiwa | tune biwa |
| Em/Hûn/Ew hebûbiwan | tune biwan |

**G. b) Raweya bilanî; Dema niha û pêş**

| | |
|---|---|
| Ez hebim | tune bim |
| Tu hebî | tune bî |
| Ew hebe | tune be |
| Em/Hûn/Ew hebin | tune bin |

**G. c) Dema niha û pêş II**

| | |
|---|---|
| Ku ez hebim | ku ez tune bim |
| Ku tu hebî | ku tu tune bî |
| Ku ew hebe | ku ew tune be |
| Ku em/hûn/ew hebin | ku em/hûn/ew/ tune bin |

**H. Raweya fermanî**

| | |
|---|---|
| Hebe! | mebe! |
| Hebin! | mebin! |

## RAWEYA NEYÎNÎ YA LÊKERAN

### A. Dema niha

Da ku mirov lêkereke ku li gor dema niha hatiye tewandin bike raweya neyînî, divê mirov pirtika di ku pirtika dema niha ya lêkeran e, hilde. Di şûna wê de pirtika neyînî ya na-yê, ku lêker bi bêdengekê dest pê bike, yan jî bi tenê n -yê, ku lêker bi dengdara «a»-yê dest pê bike, bi lêkerê ve binivîse. Bo nimûne:

| Lêker | Raweya erînî | Raweya neyînî | Raweya Fermanî Neyînî |
|---|---|---|---|
| Kirin | Ez dikim | nakim | |
| | Tu dikî | nakî | meke!, neke! |
| | Ew dike | nake | |
| | Em/Hûn/Ew | dikin nakin | mekin!, nekin! |
| Nivîsîn | dinivîse | nanivîse | menivîse!, nenivîse! |
| Sûtin | disû | nasû | mesû!, nesû! |
| Jiyan/Jîn | dijî | najî | mejî!, nejî! |
| Barîn | dibare | nabare | mebare!, nebare! |
| Qajîn | diqaje | naqaje | meqaje!, neqaje! |
| Xwarin | dixwe | naxwe | mexwe!, nexwe! |
| Alastin | dialêse | nalêse | mealêse!, nealêse! |
| Eşîn | diêşe | naêşe | meêşe!, neêşe! |
| Iskîn | dîiske | naîske | meîske!, neîske! |
| Orîn | diore | naore | meore!, neore! |
| Ûrîn | diûre | naûre | meûre!, neûre! |
| Enirîn | dienire | naenire | meenire!, neenire |

## LÊKERÊN HEVEDUDANÎ

| | | | |
|---|---|---|---|
| Dil şikandin | dil dişkêne | dil naşkêne | dil meşkêne!, dil neşkêne! |
| Lê xistin | lê dixe | lê naxe | lê mexe!, lê nexe! |
| Pê şêwirîn | pê dişêwire | pê naşêwire | pê meşêwire!, pê neşêwire! |
| Jê rijandin | jê dirije | jê narije | jê merije!, jê nerije! |
| Tê dan | tê dide | tê nade | tê mede!, tê nede! |
| Vexwarin | vedixwe | venaxwe | vemexwe!, venexwe! |
| Dadan | dadide | danade | damede!, danede! |
| Raxistin | radixe | ranaxe | ramexe!,ranexe! |
| Derketin | derdikeve | dernakeve | dermekeve!, dernekeve! |
| Wergirtin | werdigire | wernagire | wermegire!, wernegire! |
| Hilavêtin | hildiavêje | hilnavêje | hilmeavêje!, hilneavêje! |

Hin ji Kurmancan, raweya neyînî ya lêkerên bi pêşpirtikên wek bi «ra-, ve-, der-, hil-» û hwd ve hevedudanî ne lê di tewangê de ji hev nahêne veqetandin, her yekser pirtika na-yê bi serê lêkerê ve dinivîsin. Bi vî rengî raweya neyîniyê çê dikin. bo nimûne:

| | |
|---|---|
| vexwarin | navexwe |
| raxistin | naraxe |
| wergirtin | nawergire |

Lêkerên wek «karîn» û «zanîn»-ê bi pirtika ni-yê tête neyînî kirin. Wek;

| | | | |
|---|---|---|---|
| Zanîn | dizane | nizane | mezane, nezane! |
| Karîn | dikare | nikare | |

### B. Dema pêş

Raweya neyînî, di gişt demên pêş yên hemû lêkeran de (karîn û zanîn ne têde), her bi alîkariya pirtika «NE»-yê têne çêkirin. Wek;

| Lêker | Dem | |
|---|---|---|
| Çûn | ez ê | neçim |
| | | neçûma |
| | | neçûbim |

### C. Dema borî

Hemû lêker, lêkera zanîn û karîn ne têde, di gişt demên borî de bi alîkariya pirtika ne-yê têne neyînî kirin. Bo nimûne;

| | | |
|---|---|---|
| Kirin | min | nekir |
| | | nedikir |
| | | nekiriye |
| | | nekiribû |

# TERMÊN HIQÛQÎ

*Amadekar* : Musa KAVAL

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| Kes | şahıs | personne | person |
| Kesane | şahsî | personnel | personal |
| Kesî | şahıs | personnel | personal |
| Kesahî | şahsiyet | personnalité | personality |
| Netewe | ulus | nation | nation |
| Neteweyî | ulusal | national | national |
| Neteweyîtî | ulusallık, millilik | carectère national | nationhood |
| Neteweperwer | ulussever, ulusçu | nationaliste, qui aime sa nation | nationalist |
| Neteweparêz | ulusçu, milliyetçi | nationaliste, qui défend sa nation | nationalist - |
| Neteweparêzî | ulusçuluk, milliyetçilik | nationalisme | nationalism |
| Neteweperest | koyu ulusçu, şöven milliyetçi | chauvin | chauvinistic |
| Navneteweyî | uluslararası, | international | international |
| Gelemper | genel | général | general |
| Bi gelemperî | genellikle, genel olmak | généralement | generally |
| Giştî | kamu | public | public |
| Giştî | genel | général | general |
| Civat | toplum | société | society |
| Civatî, civakî | toplumsal | social | social |
| Exlaq, sinc | ahlak | morale, ethique | ethics |
| Seredan | görüşme | visite | visit |
| Danberhevî | karşılaştırma | comparaison | comparaison |
| Dan ber hev | karşılaştırmak | comparer | to compare |
| Bi dananberhevî | karşılaştırmak | comparé | compared |
| Peyketin | takib | poursuite | pursuit, prosecution |
| Dad | adalet | justice | justice |
| Dadî, qeza | adlî, tûzel | judiciaire | judicial |
| Hiqûq | hukuk | droit | law |
| Hiqûqî | hukuksal | juridique | juridical |
| Qanûn | kanun | loi | law |
| Hiqûqê neteweyî | ulusal hukuk | droit national | national law |
| Hiqûqê navneteweyî | uluslararası hukuk | droit international | international law |
| Hiqûqê giştî | kamu hukuku | droit public | public law |
| Hiqûqê danberhevî | karşılaşktırmalı hukuk | droit comparé | compared law |

hejmar 6 zivistan 1990

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## Anatomiya mirov

*(dumahîka hejmara 5)*

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *înglilizî* |
|---|---|---|---|
| **1 - 29 QERQÛDE, SKELET** | **ISKELET** | **SQUELETTE** | **SKELETON** |
| 1. kilox | kafatası | crâne | skul |
| 2 - 5 Stûna piştê | bel kemiği | colonne vertébrale, épine dorsale | vertabral column spinal column |
| movik | omur | vertèbre | vertebra |
| geh, girêçik | eklem | jointure | joint |
| 2. movikên stû : 7 lib in, ji tevahiya wan re stûkurk tê gotin. | boyun omurları | vertèbres cervicales | cervical vertebra |
| 3.movikên piştê : 7 lib in. | sırt omurları | vertèbres dorsales | dorsal vertebra |
| 4. movikên mazmazkê | | vertèbres lombaires | lumbar vertebra |
| hestiyê kortîxê | sağrı kemiği | sacrum | sacrum |
| 5. kilêjî, hestiyê boçikê | kuyruk kemiği | coccyx | coccyx |
| 6 -7 kembera mil | | ceinture scapulaire | shoulder gridle |
| 6. pirika mil | köprücük kemiği | clavicule | clavicle |
| 7. bêrok, pîl | kürek kemiği | omoplate | shoulder blade |
| 8 - 11 sebeta sîng, qefesa sîng, rikeha sîng | göğüs | thorax | thorax |
| 8. depê sîng | göğüs kemiği | sternum | breastbone |
| 9. parsû | kaburga | côte | true rib |
| 10. zirparsû, parsûyên kurt | serbest kaburgalar | côtes flotantes | false ribs |
| 11. kirkirka parsûyê | kaburga kıkırdağı | cartilage costal | costal cartilage |
| 12 - 14 mil, pî, bask, çeng | kol | bras | upper arm |
| 12. lûla pazû | üst kol lülesi | humérus | humerus |
| 13. lûlezenda zirav | döner kemik | radius | radius |
| 14. lûlezenda stûr | dirsek kemiği | cubitus | ulna |
| 15 - 17 dest | el | main | hand |
| 15. hestiyên bazinê (qevdika) dest | bilek kemikleri | carpe | carpus |
| 16. şeyê dest | tarak kemikleri | métacarpe | metacarpal bone |
| 17. hestiyên tiliyan | parmak kemikleri | phalanges du doigt | phalanx |
| 18 - 21 legen, kodik | leğen, havsala | bassin | pelvis |
| 18. hestiyê qorikê, hestiyê kemaxê | kalça kemiği | os iliaque | ilium, hip bone |
| 19. hestiyê qûnê | verek, iskiyon | ischion | ischium |
| 20. hestiyê rûv | kasık kemiği | pubis | pubis |
| 21. hestiyê kortîxê | sağrı kemiği | sacrum | sacrum |
| 22-25. ling | bacak | jambe | leg |
| 22. hestiyê ran, hestiyê hêtê | uyruk kemiği | fémur | femur, high bone |

## Civîna Stockholmê

Civîna şeşemîn a li ser zaravê kurmancî li Xwendegeha bilind a Biskops Arnö, nêzî bajarê Stokholmê, roja 12ê teşrînê dest pê kir û heya 18ê teşrînê dom kir.

Hevalên ku di vê civînê de beşdar bûn ev bûn: Rojen Barnas (Diyarbekir), Lutfî Baksî (Xerza), Mahmûd Baksî (Xerza), Cemal Batu (Mêrdîn), Xelîl Dihokî (Dihok), Mûsa Kaval (Hekarî), Hazim Kiliç (Hekarî), Kendal Nezan (Diyarbekir), Huner Salim (Akrê), Mehmed Uzun (Swêrek), Reşo Zîlan (Agirî).

Civîn vê carê jî li ser peyvên hiqûqî û yên anatomiya mirov xebitî. Paşê Hazim Kiliç rapora xwe li ser termên ku di çandiniyê de tên bi kar anîn pêşkêş kir. Beşdar bi firehî li ser van peyvan rawestiyan.

Ewê civîna bihara 1990an giraniya xwe bide termînolojiya edebî û kurmanciya nivîskî ya *Hawar* û *Roja Nû*.

KURMANCÎ



| | | | |
|---|---|---|---|
| 23. serçok, serjinû, keşka çokê, çortanok, kasika çokê, kodika çokê | diz kapağı | rotule | patella, kneecap |
| 24. lûlaqa zirav | kamış kemiği | péroné | fibula, splint bone |
| 25. lûlaqa stûr, gîtik, hestiyê birçî | kaval kemiği | tibia | tibia, shin bone |
| 26-29. pê | ayak | pied | foot |
| 26. hestiyên bazinê pê | ayak bileği kemikleri | tarse | tarsus |
| 27. hestiyê paniyê | topuk kemiği | calcanéum | calcaneum, heelbone |
| 28. hestiyên şeyê pê | ayak tarağı kemikleri | métatarse | metatarsus |
| 29. hestiyên pêçiyan | ayak parmağı kemikleri | phalange de l'orteil | phalange |
| **52-63. PÊ** | **AYAK** | **PIED** | **FOOT** |
| pêçî | ayak parmağı | orteil | toe |
| 52. pêçiya beranê, pêçiya mezin | ayak baş parmağı | gros orteil | big toe |
| 53. pêçiya dirêj | orta ayak parmağı | deuxieme orteil | second toe |
| 54. pêçiya navîn | | troisième orteil | third toe |
| 55. pêçiya babelîçkê | | quatrième orteil | fourth toe |
| 56. pêçiya qilîçkê | küçük ayak parmağı | petit orteil | little toe |
| 57. neynûka pêçiyê | ayak parmağı tırnağı | ongle de l'orteil | toenail |
| 58. girêka pê | | éminence de l'articulation | ball of the foot |
| 59. gûzika derve | | malléle externe | lateral malleolus |
| 60. gûzika hundir | | malléle interne | medial malleolus |
| 61. piştpê | ayak sırtı | dos de pied | dorsum of the foot |
| 62. hevêsa pê, zengiya pê, kefa pê | ayak tabanı | plante de pied | sole of the foot |
| 63. panî | topuk | talon | heel |
| **64-83. DEST** | **EL** | **MAIN** | **HAND** |
| 64. tiliya mezin, tiliya beranê | baş parmak | pouce | thumb |
| 65. tiliya nîşandanê | işaret parmağı | ilindex | index finger |
| 66. tiliya navîn, tiliya dirêj | ortak parmak | majeur | middle finger |
| 67. babelîçk, tiliya gustîlkê | yüzük parmağı | annulaire | ring finger |
| 68. qilîçk, tiliya biçûk | küçük parmak | auriculaire | little finger |
| 69. | | bord radial de la main | radial side of the hand |
| 70. tenişta dest | | bord cubital de la main | ulnar side of the hand |
| 71. hevêsa dest, kefa dest | el ayası | paume | palm of the hand |
| 72-74. xêzikên dest | el çizgileri | lignes de la main | lines of the hand |
| 75. gurçika dest, nermika dest | | éminence thénar | ball of the thumb |
| 76. qevdika dest, bazinê dest | | poignet | wrist |
| 77. movikên tiliyan | | phalange | phaan |
| 78. gûpika tiliyê | | pulpe de la phalangette | finger pad |
| 79. sertilî | parmak ucu | bout de doigt | fingertip |
| 80. neynûk | tırnak | ongle | nail |
| 81. spîka neynûkê | | lunule | lunule of the nail |
| 82. girêkên dest | | noeuds de l'articulation | knuckles |
| 83. piştdest | el sırtı | dos de la main | back of the hand |









# Termên Çandinî

*Amadekar* : HazimKILIÇ

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| *nn.* (navê nêr) | eril isim | masculin | masculine |
| *nm.* (navê mê) | dişil isim | féminin | feminine |
| çandin | tarım, ziraat | agriculture | agriculture |
| çandinî | tarımsal, ziraatsal | agraire, agricole | agrarian, agricultural |
| ber | ürün | produit | product, fruct |
| ber hilanîn | ürün almak, ürün kaldırmak | récolter | to harvest |
| erd, *nn.* | toprak, mülk, arazi | terre, terrain | earth, ground |
| ax, *nm.* | toprak | sol | soil |
| hêşinahî, şinkatî, *nn.* | yeşillik, nebat | légume | vegetable |
| xwelî, *nm.* | kül, toz | poussière, cendre | dust, ask |
| hêman, *nm.* | unsur, eleman | élément | element |
| xîz, sîlik, sêlax, rîk, *nm.* | kum | sable | sand |
| xireber, xîçik, *nm.* | çakıl | gravier | gravel |
| gil, kîlte, *nm.* | kil | argile | clay |
| kils, kişil, *nm.* | kireç | chaux | lime |
| gêç, cixs, cils, cis, *nm.* | alçı | gypse | gypsum, plaster stone |
| humus, *nm.* | umus | humus | humus |
| axa bi xîz | kumlu toprak | sol sablonneux | sandy soil |
| axa bi kîlte | killi toprak | sol argileux | clayey soil |
| axa bi kils | kireçli toprak | sol calcaire | chalky soil |
| kêlan, cot kirin, erd ajotin | toprak sürmek | labourer | to plough, to plow, to till |
| kêlangeh, *nm.* | sürüme ayrılmış toprak | terre de labourage | plowing land |
| kolan (bikole!) | toprağı kirizma etmek, kazmak | creuser, bêcher | to dig, to turn over (earth) |
| tov kirin | tohum ekmek | ensemencer, semer | to sow, to seed |
| mangêr, *nn.* | tırmık, kültivatör | herse | harrow |
| mangêr kirin | tırmık çekmek | herser, biner | to harrow |
| binkol, tivrik, *nn.* | çapa | houe, hoyan | hoe, mattock |
| binkol kirin, tevrik kirin | çapalamak | houer | to hoe |
| şene, *nn.* | tırmık | râteau | rake |
| şene kirin | tırmıklamak | enfouir au râteau, | to rake râteler |
| serav, *nm.* | ilk sulama | premier arrosage d'un jardin | first watering of a garden |
| serav kirin | ilk sulamak | arroser pour la première fois un jardin | to water for the first time a garden |
| tov, toxim, *nn.* | tohum | graine, semence | seed |
| zibil, peyn, *nn.* | gübre | engrais, fumier | manure, dung, fertilizer |
| ziblê xwezayî, ziblê heywanan | doğal gübre | fumier, engrais naturel | dung, manure |
| ziblê kîmyayî | kimyasal gübre | engrais chimique | chemical fertilizer |
| avezibil | gübre şerbeti | engrais liquide, purin | liquid manure |
| giyazibil | ot gübresi | engrais végétal | vegetal manure |
| zilq, çirt, zîrç | kuş gübresi | fiente d'oiseaux et de vollaille | droppings of birds |
| ziblê sar | sığır gübresi | fumier de bovins | cattle dung |
| ziblê germ | at, eşek, gübresi | fumier de cheval, de mule | horse and donkey dung |
| pişkil, pişkul , *nn.* | koyun, keçi dışkısı | crotte, crottin | droppings of sheep |
| rêx, rîx, *nm.* | büyük baş hayvan gübresi | bouse | cow dung, cowpat |

# Bêr û Mer

**Bêr** li aliyê rojava û bakur, **mer** li aliyê Hekarê ji bona alatê kolanê tête gotin ku tirkiya wê *"kürek"* e. **Mer** li aliyê rojava û bakur, metirke li aliyê Hekarê ji bona alavê binkolanê tête gotin ku tirkiya wê *"bel, belküreği"* ye.

## Çend peyvên din

Di civînê de li ser navên hin giyayên din jî hate axaftin, lê mixabin me nikarî van navan wergerînin zimanên biyanî. Heke ji xwendevanên *Kurmancî* hin kes bi tirkî, erebî, farisî, îngilîzî, fransîzî an rûsiya van navan bizanibin, bira ji kerema xwe re em agahdar bikin.

**tûsî**,*nm* : giyayek e, li biharê hêşîn dibe, bejna wê qasî du bihustan e, rengê wê morê vekirî ye, pelên wê hûrik û bi dirrî ne, qaçilê wê diqeşêrin û wekî çerez tê xwarin.

**baxoxe**, *nm* : giyayek ji malbata kerenga ye, serê wê bi pel e, berên wê girover in û wekî pelên wê bi dirrî ne; berên wê tên xwarin, ew bi xwe jî tê qeşartin û xwarin.

**bendik**, *nm*: giyayek avî ye, biharê wekî tûzikê li ber devê kanî an çeman hêşîn dibe, tama wê nêzî ya bexdenûsê ye.

**kûzrek**, *nm* : giyayek e, di gulanê de hêşîn dibe û qasî mehekê dijî, pelên wê ji çar pelikan pêk tên, qirna wê di rûn û hêkan de diqewirînin û dixwin.

**pêmirîşk**, *nm* : giyayek e demî ye, pelên wê wekî piyê mirîşkê ne, qirna wê dikelînin û dixwin.

**sping**, *nm* : giyayek e, pelên wê zirav û dirêj in û bi xavî wekî çerez tên xwarin, ew bi xwe wekî nîvesêvek e û bi şîr e.

**xenclîsk**, *nm* : giyayek e, sêvika wê ya binaxê qasî gûzekê ye, rengê sêvikê qehweyî yê tarî ye.

| | | | |
|---|---|---|---|
| kesil, kospil, fişqî, *nm* | at, eşek, katır gübresi | fiente de cheval, de mule et d'âne | droppings of horse, donkey, etc |
| ziblê tevlihev, ziblê têkel | karışık gübre | engrais mélangé | mixed dung |
| giyajeng, *nm* | yabani ot, alınması gereken otlar | mauvaise herbe | weed |
| ka, *nm* | saman | paille | straw |
| tenî, *nm* | kurum | suie | soot |
| herî, celb, *nm* | çamur | boue | mud, slush |
| bermayî, *nm* | artık | reste, résidu | remaining, residium |
| ziblê madenî | madeni gübre | engrais minéral | mineral fertilizer |
| **AVDAN** | **SULAMA** | **ARROSAGE** | **WATERING IRRIGATION** |
| derav, qetek,*nm* | su tevzi kanalları, tevzi ağzı | points de distribution de l'eau | water supply points |
| awayên avdanê | sulama türleri | procédés d'arrosage | watering forms |
| reşandin (bireşîne!) | serperek sulamak | arroser | to water |
| awayê deravî | tüm arazi parçalarının enlemesine birden sulanması | arrosage en largeur de toutes les parcelles | watering in breadth all parcels of land |
| xewnandin, *nm* | dinlendirici sulama, gece sulaması | arrosage de nuit | night watering |
| destedêr kirin | çabuk sulama | arroser rapidement | to water quickly |
| avdêr, *n.* | sulamacı | arroseur, arroseuse | sprinkler |
| **KANIYÊN AVDANÊ** | **SULAMA KAYNAKLARI** | **SOURCES D'ARROSSAGE** | **WATERING SOURCES** |
| çem, rûbar, *nm* | dere, ırmak, nehir | ruisseau, rivière, fleuve | stream, river |
| co, *nm*., cok, *nm.* | kanal, ark | canal | channel |
| kêfte, lîç, *nm.* | gölet | réservoir d'eau, pièce d'eau, étang | pond |
| ger, *nm.* | akarsudaki göl kısmı | eaux stagnantes d'une rivière | stagnant waters a river |
| bîr, *nm.* | kuyu | puits | well |
| bincan | akarsu üzerinde yapılan sed vasıtasıyla su yükseltilerek araziye su verilmesi | irrigation à partir d'une écluse | irrigation from a look |
| **AMÛRET, ALAV, HACET, ALETÊN ÇANDINÎ** | **TARIM ARAÇLARI** | **INSTRUMENTS ARATOIRES** | **AGRICULTURAL INSTRUMENTS, TOOLS** |
| dirûn (bidirû! ), | tahıl ve ot biçmek | moissonner | to harvest |
| çinîn (biçine !) | biçmek, devşirmek, toplamak | cueillir | to gather, to pick, to pluck |
| çandin (biçîne!) | ekmek, dikmek | semer, cultiver, planter | to seed, to cultivate, to raise, to grow |
| gêre, *nm*., xarman, *nm.* | harman dövme | battage de céréales | threshing of corn |
| daweşandin (daweşîne !) | silkmek, silkelemek | secouer | to shake |
| dirûngeh, | biçim alanı | aire de moisson | harvest area |
| bêder kirin, bênder kirin | harmanlamak | battre (les céréales) | to thresh |
| bêder, coxîn, *nm.* | harman yeri | aire de battage | threshing-floor |
| cot, *nm.* | karasaban | charrue | plough |
| cot kirin | çift sürmek | labourer | to plough |
| hevcar, *nm.* | karasaban gövdesi | le bâti de la charrue | plough frame |
| nîr, *nm.* | boyunduruk | joug | yoke |
| gêsin, gîsin, *nm* | saban demiri | soc | ploughshare |
| mahlû, *nm.* | tırmık, tapan | râteau | rake |
| mangêr, *nm.* | disk, diskaro | | |
| kotan, *nm.* | pulluk | brabant | all-metal wheel plough |
| parxêl, *nm.* | öküz, atla toprak üzerinde çekilen kızak | traîneau de transport, | transportation sledge, schlitte timber sledge, dray |
| makîna dirûnê | biçer makinası | moissonneuse-batteuse | harvester, reaping machine |
| makina dirûn û gêrê | biçer-döğer makinası | moissonneuse- | combine (harvester) |
| mîbzer, makîna tovreşanê, *nm.* | tohum ekme makinası | semeuse | drill (for sowing) |
| patos, *nm.* | döğme makinası | batteuse | thresher, threshing machine |
| moşene, kam, gam, *nm.* | döğen | batteuse à traction animale | thresher |
| cercere, cencere, *nm.* | silindir tekerlekli ve döğme makinası silindirleri balta ağızlı | batteuse à roues cylindriques | cylindrical wheel thresher |
| cendere | pres makinası, sıkıştırma makinası | presse, presse à comprimer | press, pressing machine |
| **AMÛRETÊN GIYA KIŞANDINÊ** | **OT TAŞIMA ARAÇLARI** | **MOYENS DE TRANSPORT DU FOIN, TRAÎNEAU** | **HAY TRANSPORTATION MEANS** |
| garte, *nm.* | kızak | véhicule que l'on traîne sur la neige | sledge, sleigh |
| qol, *nm.* | kızaksız, yalnız halat üzerinde yapılan ot çekimi | transport du foin sur des câbles | cable transportation of hay |

| | | | |
|---|---|---|---|
| ereba ga | kağnı | char à beufs | oxen cart |
| dadan (dade!) | 1) kaymak, 2) konmak | 1) glisser 2) se poser, se percher | 1) to slip 2) to settle, to perch |
| tehisîn, (bitehese!) | gayrı ihtiyari kaymak | glisser involontairement | to slip unintentionally |
| tehesandin, (bitehesîne!) | kaydırmak | faire glisser | to slide |
| şemitîn (bişemite!) | kaymak | glisser | to slip |
| şemitandin (bişemitîne!) | kaydırmak | faire glisser | so slide |
| xirxal, *nm.* | teker | roue | wheel |
| firxûn, *nm.* | bir tür at arabası, | charrette à cheval | horse cart |
| bêr, mer, *nm.* | kürek | pelle | shovel |
| mer, metirke, *nm.* | bel, belküreği | bêche | spade |
| tevir, *nm.* | kazma, biri kesici, ağızlı kazma diğeri kazıcı çift | pioche à deux pointes | mathock |
| tevrik, *nn.* | çapa | houe | hoe |
| kulling, *nn.* | 1) inşaat ve taş çıkarma kazması, 2) manivella,murc | 1) pioche, rivelaine, pic à deux pointes 2) manivelle, levier | 1) mathock, pickaxe 2) crank, lever |
| tirmix, *nm.* | tırmık | râteau | rake |
| melhêb, *nm.* | yaba | fourche | fork, hayfork |
| meqes, *nm.* | makas | ciseaux | scissors |
| şeyê dest | el tarağı | peigne | comb |
| birrek, *nm.,* mişar | bıçkı, destere | scie | saw |
| çakûç, *nn.* | çekiç | marteau | hammer |
| sindan, *nn.* | örs | enclume | anvil |
| das, *nm.* | orak | faucille | sickle |
| şalok, dasa paleyiyê | biçme orağı | faucille de moissonneur | harvester's sickle |
| dasa daran | dehre | serpe | billhook |
| kêlindî, qirim, *nm.,* tirpan | tırpan | faux | scythe |
| kêlindîkêş, *nn.,* tirpankêş | tırpancı | faucheur | reaper, mower |
| kêr, *nm.* | bıçak | couteau | knife |
| kêrik, *nm.* | çakı | couteau de poche | pocket knife |
| zevî, *nm.* | tarla | champ | field |
| lat, *nm.* | küçük tarla | portion de champ, petit champ | small field |
| berxwêr, şeqlîşa, *nm.* | büyük tarla | domaine agricole, latifundium | domain, estate |
| bax, *nn.* | ağaç bahçesi | verger | orchard |
| baxçe, *nn.* | sebze, meyve bahçesi | jardin | garden |
| bostan, bîstan, *nn.* | sebze tarlası yada bahçesi | potager | kitchen garden |
| parêz, werz, *nn.* | kavun, karpuz tarlası | champ de pastèques et de melons | melon, watermelon field |
| rez, *nn.* | bağ | vignoble | vineyard |
| malik, mişar, *nn.* | tarh | rangée d'un jardin | row of a garden |
| kertik, *nm.* | çeltik evleği | rangée d'une rizière | row, line of a rice field |
| kerdî, latik, *nm.* | bahçe, bostan evleği | parcelle d'un champ ou d'un jardin | parcel of a field or garden |
| tixûb, *nn.* | sınır, hudud | frontière | border, boundary |
| mişkane, *nm.* | rehin, ipotek | gage, hypothèque | mortgage |
| zeviya xwe bi mişkane dayin | tarlasını hipoteğe vermek | hypothéquer son champ | to mortgage a field |
| pişkane, *nm.* | müşterek hisseli mülk | propriété indivise, collective | undivided, collective land |
| nîvekarî, *nm.* | ortakçılık | métayage | sharecropping |
| givande, *nm.* | topraktan tarla sınırı | tallus de remblai | slope, embankment |
| hewd, *nn.* | fide tarhı, fidelik | pépinière | seed bed |
| axesor, *nm.* | kırmızı toprak | terre rouge | red soil |
| axereş, *nm.* | kara toprak | terre noire | black soil |
| axeşîn, *nm.* | gri toprak | terre grise | grey soil |
| kîlte, *nm.* | killi toprak | sol argileux | clayey soil |
| berespî, *nn.* | kireç taşı | pierre à chaux | clayey stone |
| tevş, *nn.* | küçük, yassı, sivri ağızlı taş | galet | pebble |
| helan, *nn.* | yassı, tabaka tabaka oluşmuş taş | dalle | flagstone |
| reşe, *nn.* | korkuluk | épouvantail | scarecrow |
| heska hirçê | kepçe şeklindeki korkuluk | épouvantail en forme de louche | bugbear |
| dexil, tene, *nn.* | tahıl | céréales | cereal, corn |
| genim, *nn.* | buğday | blé | wheat |

| | | | |
|---|---|---|---|
| şilêl, çexdar, *nn.* | çavdar | seigle | rye |
| ceh, *nn.* | arpa | orge | barley |
| garis, *nn.* | darı | millet | millet |
| genimşamî, gilgil, lazût, *nn.* | mısır | maïs | maize, Indian corn |
| şûv, şov, *nm.* | nadas | jachère | fallow |
| adan, *nm.* | besin, gıda | aliment, substance nutritive | food, nutriment |
| bi adan | besleyici | nutritif | nutritive, nourishing |
| aşêv kirin, adê kirin (ade) | yabani otlardan ayıklamak | sarcler | to weed(garden), to clean (a field) |
| fasûlî, lobî, *nn.* (ji latinî phaseolus) | fasulya | haricot | bean |
| maş, *nn.* | Hint fasulyesi | haricot d'Inde | Indian bean |
| polik, bezelî, *nn.* | bezelye | petit pois | garden pea |
| birinc, riz, *nn.* | pirinc | riz | rice |
| kulind, kulindir, *nn.* | kabak | courge | marrow |
| dolmik, kulindterk, *nn.* | dolmalık kabak | courgette | courgette |
| bamye, *nn.* | bamya(y) | gombo | gombo |
| tirozî, kilyar, ecûr, *nn.* | acur | concombre russe | Russian cucumber |
| gulberojk, *nm.* | ayçiçeği | tournesol | sunflower |
| xas, xes, kahû, *nn.* | marul | laitue | lettuce |
| silk, *nn.* | pancar | bette, poirée | beet |
| şêlim, *nn.* | şalgam | betterave | beetroot |
| giyadermank, *nn.* | hekimlikte kullanılan otlar | herbes médicinales | medicinal herbs |
| qorîngan | kırmızı çiçekli yonca | trèfle rouge | red clover |
| ketezer | sarı çiçekli yonca türü | trèfle jaune | yellow clover |
| zil, qeram, *nn.* | kamış | roseau | reed |
| **D A R** | **AĞAÇLAR** | **ARBRES** | **TREES** |
| pejnandin(bipejne!) | budamak | élaguer, émonder | to prune, to trim |
| kezaxtin(bikezêxe!) | bağ budamak | tailler la vigne | to dress vine |
| pejik, *nn.* | küçük ve ince dal parçası | branche, brindille | twig, sprig, brushwood |
| spîndar, hewr, *nm.* | kavak | peuplier | poplar |
| pelg, *nm.* | titrek kavak | peuplier tremble | aspen |
| bî, *nm.* | söğüt | saule | willow |
| şengebî, şorebî, bîşeng | salkım söğüt | saule pleureur | weeping willow |
| benav | diş budak | frêne | ask (tree, timber) |
| berû | meşe palamudu | gland | acorn |
| darberû | meşe ağacı | chêne | oak |
| mazî | mazı | noix de Galle | oak apple |
| darmazî | mazı ağacı | varieté de chêne | variety of oak |
| kevot | akça ağaç | érable | maple |
| evris, qaç | ardıç | genévrier | juniper |
| çinar | çınar | platane | plane tree |
| **DARÊN MEYWE** | **YEMİŞ AĞAÇLARI** | **ARBRES FRUITIERS** | **FRUIT TREES** |
| zirişk, qermox, *nm.* | diken üzümü | épine vinette | barberry |
| dirik, dirîmok, dendûreşk, *nm.* | böğürtlen | mûron | blackberry |
| şîlank, *nm.* | kuş burnu | églantier | wild rose |
| findeq, *nm.* | fındık | noisette | hazelnut |
| gûz, *nm.* | ceviz | noix | walnut |
| xurme, qesp, *nm.* | hurma | datte | date |
| gul | gül | rose | rose |
| sosin | zambak | lys, iris | lily |
| **DAR, nm** | **AĞAÇ** | **ARBRE** | **TREE** |
| reh, *nm.* | kök | racine | root |
| rîşe, *nm.* | kökçük, ince kök teli | radicelle | radicel, rootlet |
| qurm, *nm.* | ağaç gövdesi | tronc | trunk |
| ta, *nm.* | dal | ramification, branche | branch, ramification |
| şax, *nm.* | küçük dal | rameau | small branch, twig |
| çeq, çiqil, *nm.* | ince dal | brindille | twig, sprig |
| ajfiliz, aj | filiz | pousse | sprout |
| patrome, lûl | aşı | greffe | graft, scion |
| patrome kirin | ağaç aşılamak | greffer | to graft |
| goyin, *nm.* | nöbet, sıra | garde, surveillance | guard |
| goyinger | nöbetçi | gardien, veilleur | keeper, watchmen |

# TERMÊN HIQÛQÎ

*Amadekar* : Musa KAVAL

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîz |
|---|---|---|---|
| çavkanî | kaynak | source | source |
| çavkaniyên | hukukun | les sources | the sources |
| hiqûqê | kaynakları | de droit | of law |
| qanûn | yasa | loi | law |
| qanûna bingehî | anayasa | constitution | constitution |
| qanûnî | yasal | légal | lawful, legal |
| biryar | karar | décision | decision |
| biryarname | kararname | décret, ordonnance | decree, ordinance |
| xweza | doğa | nature | nature |
| xwezayî | doğal | naturel | natural |
| hiqûqa xwezayî | doğal hukuk | droit naturel | natural law |
| hiqûqa bacê | vergi hukuku | droit fiscal | fiscal law |
| hiqûqa kar | iş hukuku | droit du travail | labour laws |
| hiqûqa giştî | kamu hukuku | droit public | public law |
| hiqûqa gelemperî | genel hukuk | droit général | general law |
| hiqûqa xwedaniyê | mülkiyet hukuku | droit de propriètè | property law |
| bank | banka | banque | bank |
| bankî | bankasal | bancaire | pertaining |
| bankgêr | bankacı | banquier | banker |
| bankgêrî | bankacılık | la banque, le métier de banque | banking |
| hiqûqa | bankacılık | droit | banking law |
| bankgêriyê | hukuku | bancaire | |
| hiqûqa malbatî | aile hukuku | droit de famille | family law |
| ewlehî | emniyet, güvenlik | sécurité | security |
| ewlehiya | sosyal | sécurité | social |
| civakî | güvenlik | sociale | security |
| ewlehiya giştî | kamu güvenliği | sécurité publique | public security |
| sîgorte, bîme | sigorta | assurance | insurance |
| pêşniyar | öneri, teklif | proposition | proposal |
| pêşniyara qanûnê | kanun önerisi | proposition de loi | law proposal |
| peyman | antlaşma, misak | pacte, traité | pact, treaty |
| hevalbendî | ittifak | alliance | alliance |
| lihevkirin | anlaşma | accord | agreement |
| lihevhatin | barışma | réconciliation | reconciliation |
| testîq kirin | tastik etmek, onaylamak | approuver, | ratifier |
| mafê | kendi | droit à l'auto- | right to selfdeter- |
| çarenûsî | kaderini tayin hakkı | right to détermination | mination |
| mafê penaberî | sığınma hakkı | droit d'asile | asylum right |
| avûkat, parêzer | avukat | avocat | lawyer, advocate |
| dadgeh | mahkeme | tribunal, court | court |
| seza, ceza | ceza | peine | sentence |
| dadgeha sezayî | ceza mahkemesi | tribunal criminel | criminal court |
| lihevanîn | sulh | réconcilation | reconciliation |
| dadgeha lihevanînê | sulh mahkemesi | tribunal d'instance | magistrates' court |
| bendname, girêdan | akd, akid | acte | acte |

hejmar 7 havîn 1990

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)



## Anatomiya Mirov

*(dûmahîka hejmara 6)*



| | | | |
|---|---|---|---|
| **1-57 - ORGANÊN HINDURÎN** | **İÇ ORGANLAR ORGANS** | **ORGANES INTERNES** | **INTERNAL** |
| 1- toşpî, n.m. | salgı bezi | glande | gland |
| toşpiya tîroîdê | tiroid bezi | corps tyroide | thyroid gland |
| **2-3- GEWRÎ** | **LARİNKS, GIRTLAK** | **LARYNX** | **LARYNX** |
| 2- hestiyê hiyoîde | hiyoid kemiği | os hyoïde | hyoid bone |
| 3- kirkirka tîroîdê | tiroid eklemi | cartilage thyroÎde | tyroid cartilage |
| 4- zengilor | soluk borusu | trachée | trachea |
| gûzika zengilorê | Adem elması, gırtlak çıkıntısı | pomme d'Adam | Adam's apple |
| 5- bronş | bronş | bronche | bronchus |
| bronşik | bronşçuk | bronchiole | bronchiole |
| 6-7 pişik, ceger,sîpelk | ak ciğer | poumons | lung |
| 6- pişika rastê | sağ akciger | poumon droit | right lung |
| 7-loba jorîn a pişikê | akciğer üst lopu | lobe supérieur du poumon | upper pulmonary lobe |
| 8- dil | yürek, kalb | cœur | heart |
| 9- perdeya navbirê, diayafragm | diyafram | diaphragme | diaphragm |
| 10- cegera reş, kezeb, mêlak | kara ciğer | foie | liver |
| 11- kîsikê zirav | safra kesesi | vésicule biliaire | gall bladder |
| 12- fatereşk, xalxalk, sipil | dalak (Arapça talak) | rate | spleen |
| 13- asik, made | mide | estomac | stomach |
| **14-22- RÛVÎ** | **BAĞIRSAKLAR** | **INTESTINS** | **INTESTINES** |
| **14-16- RÛVIYA ZIRAV** | **İNCE BAĞIRSAK** | **INTESTIN GRÊLE** | **SMALL NTESTINE** |
| 14- donzdetilk, donzdegirêk | oniki parmak barsağı | duodénum | duodenum |
| 15- rûviya birçî | boş bağırsak | jejunum | jejunum |
| 16- rûviya badayî | kıvırım bağırsak | iléon | ileum |
| **17-22- RÛVIYA STÛR** | **KALIN BAĞIRSAK** | **GROS INTESTIN** | **LARGE INTESTINE** |
| 17- rûviya kor | kör bağırsak | caecum | cecum, caecum |
| 18- apandîs, rûviya zêde | apandis | appendice | appendix |
| 19- zeblota hilkêşayî | | colôn ascencdant | ascending colon |
| 20- zeblota berwarkî | | colôn transverse | transverse colon |
| 21- zeblota dakêşayî | | colôn descendant | descending colon |
| 22- rûviya dawîn, tortorîk | rektum | rectum | rectum |
| 23- sorsorîk | yemek borusu | oesophage | oesophagus, gullet |
| 24-25 dil | kalb, yürek | cœur | heart |
| 24- guhik | kulakçık | oreillette | auricle |
| 25- tîşika pêşîn a dil | | sillon inter-ventri-culaire antérieur | anterior longitudi nal cardiac sulcus |

## Civîna Ismail Besikçi

Civîna heftemîn ya li ser zimanê kurdî, zaravê kurmancî, li Swêdê, li Biskops Arnöyê civiya. Civîn hefteyekê, ji 7ê nîsanê heta 14ê nîsanê, dom kir. Civîna bihara 1990an, îcar, bi firehî li ser termên edebî bû ku em di vê hejmarê de, beşê yekemîn yê terman diweşînin. Tevî termên edebî, hevalên beşdar li ser termên hiqûqî û anatomiyê jî xebitîn. Herçî pirsegirêkên gramatîka kurdî be, beşdar li ser rapora Reşo Zîlan, ku di derheqa rastnivisîna hin hoker û daçekan de bû, xebitîn. Em vê xebatê jî di vê hejmarê de diweşînin.

Hevalên ku beşdarî li civîna bihara 1990 an kirin ev in : Khosrow Abdollahî (Selmas), Lutfî Baksî (Xerzan), Mehmûd Baksî (Xerzan), Rojen Barnas (Diyarbekir), Cemal Batun (Mêrdîn), Joyce Blau (Fransa), Nûra Cewarî (Rewan), Firat Cewerî (Nisêbîn), Zeynelabidîn Zinar (Batman), Remzî Kerîm (Sêrt), Hazim Kiliç (Hekarî), Kendal Nezan (Diyarbekir), Zinar Soran (Mêrdîn), Mehmed Uzun (Siwêrek), Veysî Zeydanlî (Bêdlîs) û Reşo Zîlan (Agirî).

Di vê civînê de du navên nû hebûn : folklorîsta hêja Nûra Cewarî ku ji Ermenistana Sovyetî hatibû û xanima Joyce Blau ku li Zanîngeha Sorbonnê, ya Parîsê, mamosteya zimanê kurdî ye. Nivîskarê kurdê Yekitiya Sovyetî Tosinê Reşîd jî, êvarekê, hat ziyareta me. Em bi dîtina wan kêfxweş, bi xebat û pêşniyarên wan hîn têkûztir bûn.

Hevalên ku ji Rewanê hatibûn daxwaz û pêşniyar kirin ku niwênerên kurd ên Yekitiya Sovyetî jî di civînên me de beşdar bin. Me dil û daxwaz û hêvî heye ku hevalên ji Yekîtiya Sovyetî jî bikaribin di civînên bê de hazir bin û vê xebata pîroz hîn geştir û berfirehtir bikin.

Bi biryara hevalên beşdar navê vê civînê bû *Civîna İsmail Besikçi.* Herwekî ku tê zanîn, Dr. İsmail Beşikçi, nivîskar, sosyolog, ji mêj ve ye li ser doza Kurdan û pirsa Kurdistanê dixebite û wî gelek kitêb, di vî warî de weşandine. Û ji ber vê yekê, ew gelek caran hatiye girtin û bi dirêjahiya salan li zîndan û girtîxanên Tirkiyê maye. Niha, wî du kitêbên din ku li ser pirs û pirsgirêkên Kurd û Kurdistanê ne, li Stembolê, weşandine. Ji lewre, ew hatiye girtin. Ji bo nîşandana piştgirtiyê û protestkirina girtina İsmail Beşikçi, civînê telegramek ji serekkomarê Tirkiyê Turgut Özal re şand û kopiyek ji telegramê jî ji İsmail Beşikçi re bi rê kir.

KURMANCÎ

| | | | |
|---|---|---|---|
| 26-perdeya navbirê | diyafram diyafragm | diaphragme | diaphragm |
| 27- fatereşk, xalxalk, sipil | dalak | rate | spleen |
| 28- gurçika rastê | sağ böbrek | rein droit | right kidney |
| 29- toşpiya sergurçikî | böbreküstü salgı bezi | capsule surrénale | suprarenal gland |
| 30-31- gurçika çepê | sol böbrek | rein gauche | left kidney |
| 30- kovên gurçikê, kalîks | böbrek piramitleri | calice | calyx |
| 31- legena gurçikê | leğen | bassinet | renal pelvis |
| 32- mîzkêş | sidik yolu | uretère | ureter |
| 33- mîzdank | sidik kesesi | vessie | bladder |
| **34-35- KEZEB, CEGERA REŞ** | **KARA CİĞER** | **FOIE** | **LIVER** |
| 34- navika kezebê | kara ciğer göbeği | hile du foie | falciform ligament of the |
| 35- lobê kezebê | kara ciğer lopu | lobe du foie | lobe of the liver |
| 36- kîsikê zirav | safra kesesi | vesicule biliaire | gall bladder |
| **37-38- DUCOYA ZIRAVÎ** | **SAFRA KANALI** | **CANAL CHOLÉDOQUE** | **COMMON BILE DUCT** |
| 37- coya kezebe | hepatik kanal | canal hépatique | common hepatic duct |
| 38- coya ziravî | sistik kanal | canal cystique | cystic duct |
| 39- derîdamar | kapı damar | veine porte | portal (hepatic portal vein) |
| 40- sorsorik | yemek borusu | oesophage | oesophagus |
| **41-42- MADE, AŞIK** | **MİDE** | **ESTOMAC** | **STOMACH** |
| 41- serdevka made, aşik | mide ağzı | cardia | cardiac orifice |
| 42- bindevka made, aşik | mide kapısı | pylore | pylorus |
| 43- donzdetilk | on iki parmak bağırsağı | duodénum | duodenum |
| 44- pankreas | pankreas | pancréas | pancreas |




# *Li ser rastnivisîna çend tiştan*

*Reşo ZÎLAN*

## 1. Rastnivîsîna hin daçek û hokeran

Herçendî daçekên kurdî ji çend cureyan pêk bên jî, di rastiyê de, yên bingehîn ev in; ***ji, li, di, bi, bê***. Heçî daçekên din in, êdî ew bi alîkariya van daçekên han yên bingehîn tên afirandin. Ji ber vê yekê jî, di warê rastnivîsîna daçekan de, tiştê ku em bal û dêna xwe bidinê ew e, ku divê em timî van daçekên bingehîn çu caran bi peyvine din ve nezeliqînin.

Wek:

*Cerdoyê Biro mala xwe* ***ji*** *gund guhaste bajêr.*
*«Apê min têye* ***ji*** *deştê, barek strî li piştê.»*
*Keç û xortên gundê Yekavê* ***li*** *guhera gund civiyabûn.*
*Ev koloz û ev şal û şapik xweş* ***li*** *bejna te hatine.*
*«Me ji narê diye nûra te* ***di*** *dil*
*Lew ji "işqa te her ateşperes in»*
*Melayê Cizîrî*
*Wê ev melhema han* ***di*** *birîna xwe da û pak bû.*
*Gelo ew bi kurdî dizane?*
*Tiştê ku hukûmetê anîbû serê me, ne* ***bi*** *dilê xelqê bû.*
*Wê şevê* ***bê*** *(bêî) wan kes nehat.*
*Ez çayê bê şekir vedixwim.*

Hin caran mirov dikare bi alîkariya hin peyvên din kompleksên daçekî çêbike. Ji kompleksên daçekî mebest kompeyvek (komek peyv) e, ku ji çend daçekan, yan ji yek yan jî ji çend daçek û paşdaçekekê pêk tên. Ev kompeyvên han yên daçekî dikarin bi rola rengdêr yan hokerê jî rabin. Heçî ev kompeyvên daçekî ne, bêî ku em yek bi yek li maneyên peyvên ku ew jê pêk tên bigerin û bibêjin ka ew hîç maneyekê didin yan na, divê em her yekê ji wan bi tena serê xwe binivîsin. Li milekî din jî, ji aliyê hebûna maneyê ve, bê guman her perçeyek ji wan xwedî maneyekê ye.

*Baran* ***ji ber*** *sitema axayê êlê warê xwe terikand.*
*Wî xwe* ***ji ser*** *serê çiyayê Kose berda xwarê.*
*Ez ne* ***ji ba*** *wan têm.*
*Min destê xwe* ***ji bin*** *kumê xwe derneanî.*
*Zorav* ***ji bilî*** *kara xwe tiştekî din hizir nake.*
*Ev diyarî* ***ji bo*** *destgirtiya min e.*
*Dijmin* ***ji pişt*** *çiyayê Zozikê derneketiye.*
*Ew herduk* ***ji hev*** *hez dikin.*
*Memir* ***ji nik*** *pismamê xwe têt.*
*Werin van hûrûmûrên xwe* ***ji rex*** *malê hilînin!*
*Mêvan* ***ji derve*** *hatin hundir û derbasî dîwanxaneyê bûn.*
***Li ber*** *dergehê koşkê pûtekî mermerîn hebû.*
*Guldank* ***li ser*** *maseyê ye.*
*Ew wê çaxê çend rojan* ***li ba*** *me mabû.*
*Gulzar* ***li bin*** *darê rûdine.*
*Tu* ***li hember*** *wî zimandirêjiyan meke!*
*Êdî Kurd* ***li dijî*** *mercên koledariyê radibin.*
*Ev yeka han ne* ***li gor*** *dilê wî ye.*
*Bager û Diljar ne* ***li derve*** *ne.*
*Ew û ev qet* ***li hev*** *naçin.*
*Eskeran hema* ***li pêşberî*** *gundê me kemîn danî.*
*Ka tu* ***di gel*** *min were bajêr, ez ê alî te bikim.*
*Here* ***jê re*** *bibêje, ku bila ew êvarê zû vegere.*
*Dilop* ***jê de*** *dihatin xwarê.*
*Ew cotesolên ku te kirîbûn,* ***lê*** *nehatin.*
*Ka* ***pê re*** *here gund û serxwe***ş** *iyê bide gundiyan.*
*Em hingê jî* ***pê de*** *ketin, lê nebû.*
*Ma te ew* ***pê ve*** *zeliqand?*
*Ma min negote te, ku tiliya xwe* ***tê de*** *meke?*
*Wî derziyek* ***tê re*** *kir û pîjik derêxist.*

Heçî hokerên pêşdaçeka wan ketî û bi tenê paşdaçeka wan mayî ne, divê mirov paşdaçeka mayî bi tena serê xwe nenivîse. Wê her yekser bi peyvê ve binûse (bizeliqîne).

Wek:

***Paşve, paşde, pêşve, pêşde, şûnve, şûnde, serve, serde, piştre, piştve, dûre, binre*** *û her wekî din.*
*Welatê me bi destê dijmin* ***paşde*** *maye.*
*Ez ê bi alîkariya vê kursê zimanê xwe* ***pêşve*** *bibim.*
*Min taştê xwar û* ***piştre*** *du îskan çay vexwarin.*
*Dibêjin* ***piştve*** *fîşek berdanê.*

Lê heke çu tiştek ji daçekê neketibe û daçek, daçekeke tam be, divê qaîdeyên ku li jorê hatine behs û çêl kirin, derbas bibin.

Ango:
*Hezare* ***ber bi*** *gund* ***ve*** *çû.*
*Wî diviya duhî* ***bi dû*** *min* ***re*** *bida rê.*
*Ev nîr û mercên han Kurdan her* ***ber bi paş*** *ve dibin.*
*Ez ê* ***ji*** *sibehî* ***û pê de*** *li ser karê xwe nemînim.*
*Ji êvarê* ***û bi vir de*** *xew neketiye çavên dayika min.*

Ji bilî van, divê perçeyên ku di pêkanîna daçek, hoker yan jî pêşlêkerên hevedudanî de roline mezin dilîzin jî cihê û bi tena serê xwe bêne nivîsandin.

Bo nimûne:
*Di nav hev de, li ser hev, di rex hev de, li dor hev, li tenişt hev, tev li hev, ser bi ser, qor bi qor, roj bi roj, gund bi gund, pel bi pel, dan ber hev, dan ser hev, dan tenişt hev* û hwd.

Lê belê, eger ji wan perçeyan peyveke nû bête afirandin, ku ew peyv mefhûmek be û mefhûmeke xweser û taybetî be, êdî ew hingê bi hev re tête nivîsandin.

Wek:
*Curbicur, derbider, gorbigor, rûbirû, serejêr (*=nişûv, serbijêr*), serejor (*=serbijor, hevraz, kaş*), hevber (*=wekhev*), hevgel (*= hogir, destek*), demildest (*=di wê bîskê de*), berepaş, serhevraz, kerrekerr û hwd.*

## 2. Rastnivîsîna raweya çêbiwar

Raweya çêbiwar (partîsîpa dema borî) ya zaravayê kurmancî bi ***-î*** û bi ***-yî*** -yê dawî tên. Lêkerên ku radera wan bi ***-in*** û ***-în*** dawî tên, mirov di şûna wan de bi tenê ***-î***- yekê, yên ku bi ***-an*** û ***-ûn***- ê dawî tên jî, mirov di şûna wan de bi tenê ***-yî*** -yekê li koka lêkeran zêde dike. Mirov bi vî awayî raweya çêbiwar ya sade bi dest dixe.

Wek:
*Hatî* (hatin), *ketî* (ketin), *mirî* (mirin), *kuştî* (kuştin), *kirî* (kirin)
*Girî*, (girîn), *firî* (firîn), *nihêrî* (nihêrîn), *perçifî* (perçifîn)
*Mayî* (man), *payî* (pan), *dayî* (dan), *kutayî* (kutan)
*Çûyî* (çûn), *bûyî* (bûn), *cûyî* (=cûtî) (cûn, cûtin)

Raweya çêbiwar ya hevedudanî jî bi alîkariya daçekên têvel têne çêkirin. Di warê rastnivîsînê de, divê mirov berî her tiştî lê binihêre ka ew raweya çêbiwar ya hevedudanî tewandî ye yan na. Eger ne tewandî be, divê ew bi hev re bête nivîsandin.

*Gul û giyayên* ***avnekirî*** *çilmisîbûn.*
*Wî tiş tên* ***jibîrkirî*** *dianîn bîra mirovî.*
*Xortê* ***sergermbûyî*** *bi pêsîra wî girt.*
*Ew ji kesên* ***navnedayî*** *ye.*
*Mîha* ***serjêkirî*** *hilawistin.*
*Dêleseya* ***dermanxwarî*** *sekitî.*
*Bi ya kalê* ***jihevdeketî*** *be, ew hîn jî xort e.*
*Me perçeyên otomobîla* ***jihevderxistî*** *dîsan li hev siwar kirin.*
*Eskeran agir berda gundê* ***dorlêpêçayî.***
*Pereyên* ***bideyndayî*** *ji kîsê wî çûn.*
*Xwarina* ***jibermayî*** *bû para pisîka malê.*
Eger raweya çêbiwar ya hevedudanî tewandî be, divê wê çaxê em wê bi hev re nenivîsin.

Bo nimûne:
*Dîwarê* ***ji nîvê de qelişî,*** *hilweşiya.*
*Sêva* ***ji darê ketî,*** *nedihat xwarin.*
*Guletopa* ***li nîveka gund ketî,*** *neteqiya.*
*Rondikên* ***ji çavan barî,*** *nîşana hesretê bûn.*
*Navê çîroka* ***di bîrê de mayî,*** *Enter Pehlewan bû.*
*Gelo navê gundê* ***bi bajêr ve girêdayî,*** *çi bû?*
*Endamê* ***ji partiyê vekişiyayî,*** *hevalê dostekî te ye.*
*Kesê* ***bi wî re çûyî,*** *êvarê vegeriya.*
*Pêş mergeyê* ***gule li hêtê ketî,*** *pak bû.*
*Polîsan Mewlûda* ***ji bav û kalan mayî,*** *bi xwe re bir.*

# Termên çandiniyê

*(dumahîka hejmara 6)*

*Amadekar* : Hazim KILIÇ

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| nûber, nûbar | turfanda | primeur | early fruit or vegetable |
| şitil | fide | semis | seedling, young plant |
| miştelî | fidan | plant | plant |
| çevrebî | hedik | | |
| dîndar, tirşe | Lübnan palamudu | chêne libanais | oak of Lebanon |
| qaç, qarç | yayvan yabancı ardıç | une variété de genévrier | a variety of juniper |
| evris, merx | boylu yabani ardıç | une variété de genévrier | a variety of juniper |
| çam | çam | pin | pine |
| dirî | diken | épine, ronce | thorn, thorn bush, bramble |
| strî | diken | épine | thorn |
| gers, gez | ılgın | tamaris, tamarix | tamarisk |
| mêw | üzüm ağacı | vigne | vine |
| dêlî | asma | variété de vigne grimpante | creeping vine |
| gûnî | geven | astragale | astragalus |
| **MEYWE** | **YEMİŞ** | **FRUIT** | **FRUIT** |
| hilû, alû | erik | prune | plum |
| hilûreşk | kara erik | prune noire | black plum |
| hilûzerk | sarı erik | prune jaune | yellow plum |

| | | | |
|---|---|---|---|
| alûçe | can eriği, yeşil erik | varieté de prune verte | variety of geen plum |
| qeysî, zerdele | kaysı | abricot | apricot |
| gêlas, gilyaz, qerasî | kiraz (yunanca kerasos'tan) | cerise | cherry |
| fişne | vişne (rûsça vişniya'dan) | griotte | Morello cherry |
| hirmê | armut | poire | pear |
| girsk, şekok, karçîn | yaban armudu | poire sauvage | wild pear |
| hejesor, parz, sinc | iğde | éléange | oleaster |
| şîlan | kuşburnu | églantier | dog rose |
| kezwan, şengêl | çitlembik, menengüç | térébinthe | terebinth |
| xêxik | son baharda yetişen yaban eriği | prune sauvage d'automne | autumnal wild pear |
| helhelok | kızılcık | cornaline | cornel berry, cornelian cherry |
| beybûn | sarı sümbül | marguerite | daisy |
| sosineber | papatya | camomille | cammomilla |
| sosin | süsen (farsça sûsen'den) | iris | iris |
| helale | lale (farsça) | tulipe | tulip |
| nêrgiz | nergiz (yunanca narkisos'dan) | narcisse | narcissus |
| yasemîn, asmîn | yasemin | jasmin | jasmine |
| salep | salep | orchis | orchis |
| kaktûs | kaktüs (yunanca kaktos'tan) | cactus | cactus |
| hêro | Hatmi çiçeği | mauve | hollyhock, marsh mallow |
| mijmijok | sığırdili | buglosse | bugloss |
| sûs | meyan | réglisse | licorice |
| mêxik, qerefîl | karanfil (yunanca karyonfilon'dan) | oeillet, girofle | carnation |
| binefş | menekşe | vilolette | violet |
| canemerg, gula bê miraz | kardelen | perce-neige | snowdrop |
| leylaq | leylak (fasça lila'dan) | lilas | lilac |
| bûkik, bûkanî, gulebûk | gelincik | coquelicot | poppy |
| guharok | küpe çiçeği | fuchsia | fuchsia |
| sinbil | sümbül (farsça sunbul) | jacinthe | hyacinth |
| sîwanok | şemsiye çiçeği | ombellifère | umbellifer |
| gulqedîfe | kadife çiçeği | amarante | amaranth |

# Termên Edebî

*Amadekar : Rojen BARNAS*

Zengîniya zimanekî ji zengîniya bêje û termên di wî zimanî pêk tê. Term, nav an nasnavê mefhûmên ilmî û hunerî ne. Edebiyat ji alîkî ve ilm, ji alîkî ve jî hunermendî ye. Ji bo nasîn, lêkolîn, nerxpêdan û bi nasîn dayina ilmekî an hunerekî hewcedariya meriv bi van nav an nasnavên taybetî (term) heye, ku ji vê hewcedariyê termînoloji hatiye afirandin, da herkes ji gotinekê an ji nasnavekî eynî tiştî fêm bike.

Wekî her zimanê zindî û yê afirandina fikr û hunerê, hewcedariya zimanê me jî bi termînolojiya şaxên ilmê û hunerê cihê cihê heye. Ji vê dîtinê em bi rê ketin û me xebata bihevgihandina termên edebî da ber xwe.

Me bernameye xwe ya «termên edebî» ji edebiyata klasîk ber bi edebiyata nûjen danî. Di vê hejmarê de giranî li ser termên edebiyata klasîk, di hejmara bê de nîvî dê li ser edebiyata klasîk û nîvî jî li ser ya nûjen be. Di xebatên pêş me de li gora hewcedarî û fersendê emê li ser termên edebiyata cihanî jî rawestin.

Bi kurmancî binavkirin an tesbîta rastnivîsîna terman xebata hevalên beşdarî civîne ye. Hin term hene ku ew bi xwe erebî ne; wekî *xezel, qesîde, mesnewî* ku di giştî edebiyatên Rojhelata Navîn de wisa tên binavkirin, ji bona wan navekî kurdî danîn ewçend ne pêwist e.

Kurmanciya termên vê xebatê bi tinê di maneya wan a edebî de ye. Hin term gengaz e ku di zimanên dinê de ji bilî edebiyatê di hin şaxên ilm û hunerên de jî bêne bikaranîn û maneyên wan ên cihê hebin. Lê kurmanciya wan her di maneya wan a edebiyatê de hatiye danîn. Divê xwendevan lê miqate bin.

Di amadekirina vê de, min metoda «rêber» an «ansîklopedî» hilbijart ku di pêş de ev bibe binaxeya «rêbera edebiyata kurmancî» an «rêbera termên edebî». Ji vê bonê heta diva me bi nimûne û şema terman îzah kir.

Hêvidar im ku ne îro be jî siberoj bi kêrî hewcedaran bê.

**Edebiyat :** Di maneya fereh de navê giştî yê hemî tiştên devkî û nivîskî yên hunermendî, zanistî û pêşeyî ye.

**Edebiyata bedew :** Navê giştî yê hemî hunerên devkî û nivîsikî ye ku şi'r, roman, tiyatro, çîrok, û h.w.d dikevine navê.

**Edebiyata pêşeyî :** Navê giştî yê nivîsarên zanistî(tib, matematîk, fîzîk) û yên pêşeyî (meslekî) ye.

**Pêşe** : Kar, meslek

**Vegotin** : (vebêje)/**vegêrîn** (vegêre) Çîrokek, bûyerek, serpêhatiyek gotin.

**Vebêj / vegêr :** Ew kesê ku tiştekî vedibêje.

**Riyên vegotinê** : Riyên ku meriv xwezî û daxwaziyên xwe pê vedibêje, ku ev dido ne

1. **nesr /** pexşan: Vegotina bê kêş û bê aheng, wek axaftina rojane.

2. **nezm** : Vegotina bi kêş û beşavend.

**Mensûr** : Berhemên bi nesrê hatine vegotin.

**Menzûm** : Berhemên bi nezmê hatine vegotin.

**Edebî** 1. Tiştê ku bi edebiyate re têkildar e, 2. Berhema ku di warê hunermendiya edebiyata bedew de xwedî rûmetekî ye.

**Kêş** : Wezin, pîvan

**Kêşên çendahîn** : Weznên bi jimarên kîteyan çêdibin.

**Çendahîn** : Kemmiyet, kantite

**Kêşên çawahîn** : Kêşên ku li gora hêjayiya kîteyan -wek kîteya dirêj û kurt, ya vekirî û girtî- çêkirî.

**Çawahîn** : Keyfiyet, kalik.

**Kêşa kîteyî** : Kêşa ku li gora jimara kîteyan çêdibe.

**Rawest** : Di kêşên kîteyî de cihê rawestinê ye. Herwekî di kêşeke 4+4+3=11 de, rawest di pey kîteya çaran û ya heştan de tê. Ku kêş 4+3+4=11 be wê gavê rawest di pey kîteya çaran û heftan de heye. Ku kêş 5+6=11 be rawestek bi tenê heye û ew jî di pey kîteya pêncan de tê.

*Kanî Dêrşew, / ka Herekol, / ka Kepir*
*Ka zozanên / Bavê -Têlî / ka kê bir*

*Dibêjin ku / Birca-Belek / hilweşî*
*Text û bextê / botiyan de / ka geşî*
(Herekol Azîzan)

Rewest bi nîşandeka (/) hatiye nîşandan.

**Kêşa erûzê** : Kêşeke çawahîn e, ku li ser bingehê dirêjî û kurtî, vekirîbûn û girtîbûna kîteyan çêdibe. Ji edebiyata ereb derbasî edebiyata faris û ji edebiyata faris jî derbasî edebiyatên klasîk ên welatên musilman biye. Nezmên edebiyata kurd ên klasîk gişt bi vê kêşê hatine nivisandin.

**Qalib :** Kêşa rêzeke nezmê ye, ku ji çend perçeyên («cuz») kêşê pêk tê.

Herwekî
*Di fesla nûbiharê da digel dîlber biçin geştê*
*Ji ew xweştir "umur nabit, li min ew hal qewî xweş tê.*
(Xanî)

*Di fes la nû bi har ê da di gel dîl ber bi çin geş tê*
*Ji ew xweş tir 'u mur na bit, li min ew hal qe wî xweş tê.*

Me fa 'î lun me fa 'î lun me fa 'î lun me fa 'î lun
. / / / . / / / . / / / . / / /
-------------------- -------------------- -------------------- --------------------
c u z
---------------------------------------------------------------------------------------
q a l i b

**Pevgihandek** : Ji bona vekirî xwendina kîteyeke girtî, dengdara (konson) dawiya bêjeyekê jê veqetandin û bi gihandina bêjeya di pey a ku bi dengdêr(voyel) destpêkirî xwendin e. Herwekî:

*Hin gul û hin enber in, hin şîrîn û esmer in.*
(Cizîrî)

Meriv dikare vê rêzê bêje bi bêje ji hevûdu veqetandî (bi «fesil») bixwîne;

*Hin / gul / û / hin/ enber / in,/ hin/ şîrin/ û es mer /in.*

û meriv dikare bi awayê jêrîn bixwîne;

*Hin gu / l û / hin / enbe / r in / hin şîrî / n û es me / r in.*

Li vê derê di «**gu / l** û», « **r in**», «**n û** » de pevgihandek hatiye kirin ku dengdara dawiya «gul», «enber», «şîrîn», «esmer» bi dengdêra serê bêjeya berî xwe ve bi riya xwendinê hatiye gihandin ku pevgihandek ev e. Ji vê re «wesil» jî tê gotinê.

**Jêveqetandek :** Jê re fesil jî tê gotinê ku berevajiyê pevgihandekê ye. Çi pevgihandek û çi jêveqetandek ji bona ahenga kêşê tê kirinê. Jê re «fesil» jî tê gotinê. (Binêre li nimûne-ya pevgihandekê).

**Kîteya vekirî** : Kîteya ku bi dengdêrekê diqede, herwekî *ba, şe, rê, bi, kî, ko, du, zû.*

**Kîteya dirêj** : Kîteya ku bi dengdêreke dirêj (*a, ê, î, û* ) diqede.

**Kîteya kurt** : Kîteya ku bi dengdêreke kurt (*e, i, o, u* ) diqede.

**Kîteya girtî** : Kîteya ku bi dengdarek (konson) diqede, herwekî *kal, berf, zêr, cil, pîr, bor, kûr, cur.*

**Beşavend :** qafiye. Drûvpêketina dengan a di kîteya dawin a bêjeyan de ye.

**Beşavenda çaryek** : beşavenda ku bi nêzedengdarekê diqede «**guj**» û «**kaş**».

**Nîvbeşavend** : beşavenda ku bi dengdareke wekhev diqede «**mil**», «**pal**», «**bel**».

*Tu yî qadir bi yek emrê te yê «kun!»*
*Mukemmel bûye alem bêserûbin*
(∑êx Eskerî)

**Beşavenda tam** : beşavenda ku bi dengdêrek û dengdarek wek-hev biqede «**mil**», «**kil**», «**dil**».

*Îd e îro bê qerar im ez ji feqda dêmdu***rê**
*Bê hebîb im, bê hebîb im, bê hebîb im, bê heb***îb**
*Herkesek ba yarê xwe d'meşyan di sehrayan li rê*
*Pur keîb im, pur keîb im, pur keîb im, pur keîb*
(∑êx Evdirehmanê Axtepî)

**Beşavenda zengîn** : beşavenda ku dawiya wan bi diduyan zêdetir dengdar û dengdêrên wekhev biqede «**man**», «**zeman**», «**deman**», «**ziman**», «**guman**».

*Gelî biran werin cengê*
*Bişoyin dil ji vê jengê*
*Bibêjim ez heta kengê*
*Nehin yek j'me bi vê rengê*
(Mustefa Ehmed Botî)

**Beşavenda hevdeng** : beşavenda ku bi du an zêde gotinên dengdar û dengdêrên wan wekhev, lê maneya wan cihê tê çêkirin

*Şahînşehê textekê* ***Medîne***
*Mu'ciz ji te ew qeder* ***me dîne***
(Xanî)

**Beşavenda rast** : beşavenda ku wek rêza *aa, bb, cc, dd* li dû hev tên.

*Binve xweşiya dil û du çavan* (a)
*Dadê ji te re her ro nîgehban* (a)
*Da zû tu mezin bî Bedir-Xan* (a)
*Binve kezeba min bin ve lo! lo!* (b)
(Emîr Alî Bedir-Xan)

**Beşavenda çeprast** : beşavenda ku wek rêza *a b a b, c d c d*, tê danîn.

*Hê ji min dil herişandê* (a)
*Suhtiyê arê te me* (b)
*Hiş û aqil şewişandê* (a)
*Sews û bîmarê te me* (b)
(Osman Sebrî)

**Beşavenda pêçayî** : beşavenda ku li rêza *a b b a* tê danîn.

*Bedewî çilmisî l'ber pêlên zeman* (a)
*Lê şabaş! di dêlvê jîrîtî geş bû* (b)
*Dilbera ku di wextê de keleş bû* (b)
*Gula geş e, li baxê aqilmendan* (a)
(R.Barnas)

**Redîf** : bêje an kîteyên di nivîsandin û maneyê de wekhev ên di dawiya beşavendê de tên.

*Bizan ko min* ***yar*** *ti wî*
*Dil jî* ***birîndar*** *ti wî*
(Feqiyê Teyran)

yar û birîndar beşavend in.
ti wî redîf e.

**Rêz** : rêza nivîsarê ya nezmê an nesrê.
**Malik :** beyit. Durêzeya nezmê.
**Azade :** rêza bi serê xwe ya nezmê ku ne bi malik an bi perçekî nezmê ve ye.
**Takemalik :** malika bi serê xwe ku ne di nav xezel an qesîdekî de ye.
**Malika destpêkî :** metle'.Di xezel û qesîdeyan de malika destpêkirinê.
**Xweşmalika destpêkê :** husnî metle'. Malika diduyan a xezel an qesîdeyê.
**Xweşmalika dawiyê** : husnî meqte'. Malika diduyan a paşî ya xezel an qesîdeyê.
**Malika dawîn** : meqte'. Malika dawîn a xezel an qesîdeyê ku di xezelan de navê şair di vê malikê de derbas dibe.
**Şahmalik** : şahbeyt, beyt ul xezel.Malika herî bedew a xezelê.
**Bend** : koma rêzên nezmê ku ji çar, pênc, şeş... deh rêzan pêk tên.
**Xezel** : teşeya sereke ya nezma edebiyata dîwanî ye. Ji malikan pêk tê. Bi gelemperî, bi hindikî ji pênc malikan dest pê dike û heta bîst, bîst û pênc malikan jî dirêj dibe.
Numûne

XEZEL

*"Er"er xerame bi qedd û qamet*
*Yek bûse da me bi sed qiyamet*
**malika destpêkî (metle')**

*Yek bûse bexşî ewwel bi îhsan*
*Axir li min kir cirm û xeramet*
**xweşmalika destpêkê(husnî metle')**

*Ji jeng û zerqê da dil bişotin*
*Cama sedef bîn rind û keramet*

*Ji herdû çeşmên te y' mest û xûnrêz*
*Nûra du çeşman kê dî selamet*

*Li derdû êşan peykan û nîşan*
*Me j' herdû çeşman kifş in 'elamet*

*Ruswayê 'işqê tenha ne ez bûm*
*Kes dî zemanan hub bê melamet*
**sahmalik(beyt ul xezel)**

*Du secde ferz in filhal bibin ber*
*Dema xuya bit ew qed û qamet*
*Da eybê rindan nekî bi badî*
*Nufûsu qewmîn biha tesamet*
**xweşmalika dawiyê (husnî meqte')**

*Mela li 'umrî bêfayde bûrî*
*Kêşa bi zoran qehr û nedamet*
**malika dawîn (meqte')**
(Melayê Cizîrî)

-------------------------------- a
-------------------------------- a
-------------------------------- b
-------------------------------- a
-------------------------------- c
-------------------------------- a
-------------------------------- d
-------------------------------- a
-------------------------------- e
-------------------------------- a
-------------------------------- f
-------------------------------- a

**Xezela rêzkirî :** xezela ku rêzên wê di nîvekê de jî bi beşavend e û gava meriv rêzê di nîvî de dişkêne malik dibe kerte. Jê re xezela musammat jî tê gotin.
Numûne

Serwînazê **serfirazê** şubhê zêr remza **mecazê**
Dame ber çakûç û **gazê** dil ji min bir dil ji min
**malika xezela rêzkirî**
(Melayê Cizîrî)

*Serwînazê serfirazê*
*Şubhê zêr remza mecazê*
*Dame ber çakûç û gazê*
*Dil ji min bir dil ji min* **kerte**

**Nezîre** : carina şair ji xezelekê ku şairek din nivisandiye gelek hez dike. Ji ber vê hezkirinê an ji ber rêzgirtina wî şairî, şair xezelek dinivisîne ku ev xezel bi babet, kêş, beşavend, redîf, di dirûvê wê xezelê de ye.
**Qesîde** : ji curên nezmê yên edebiyata dîwanê ye ku bi mebesta pesindayin an navnokirina yekî an tiştekî tê nivisandin. Teşeyê qesîdeyê wek yê xezelê ye, ji malikan pêk tê. Malikên qesîdê ji sihî heta not û neha ne. Lê yên zêdetir jî hene.

Avakirina qesîdeyê bi gelemperî li gora vê rêzê çêdibe

1. **Xweşkirin** (teşbîb) bira pêşî ya qesîdeyê ye, ku şair bi teswîrkirina tiştekî dest bi qesîdeya xwe dike. Ev teswîr dibe a cejn, bihar, bajar, şûr, roj, gul, havîn, payîz, zivistan, hesp, sunbil, remezan û h.w.d be.
2. **Gurîzgeh** malika derbasok a ji bira «xweşkirin»ê derbasî bira mebestê ango pesindanê bûn e.
3. **Pesindan** (medhiye) bira bingehî ya qesîdeyê ye ku mebesta şair di vê de kom dibe. ∑air di vê birê de pesnê merivekî mezin dide.
4. Texezzul xezela di pey pesindanê de ye.
5. Xwepesindan(fexriye) di vê birê de şair pesnê xwe dide.
6;Tacmalik malika ku navê şair tê de derbas dibe, ku ev malik di dawiya bira xwepesindanê(fexriye) de tê.
7. Hêvî(du'a) di vê birê de şair ji bo ew kesê ku pesnê wî daye duayên qenc dike, û bi vê birê qesîde diqede.

**Mesnewî** : yek ji teşeyên nezma edebiyata dîwanê ye, ji malikan tê honandin û her malik di nav xwe de hevbeşavend e. Di babetên dirêj û çîrokan de ev teşe tê bikaranîn. Mem û Zîn û Mewlûd bi vî teşeyî hatine nivîsandin.
**Kerte** : qit'e. Bi hindikî ji çar rêzan pêk tê.
**Sêyîn** : perçeyên sêreze ne.Hevaxaftina Melayê Cizîrî û Feqiyê Teyran bi sêyîna ye.
**Çarîn** : rubaî
**Çarane** : murabba'. Ji bendên çar rêz pêk tên.
**Pêncane** : muxemmes. Ji bendên pênc rêz pêk tên.
**Sesane** : museddes. Ji bendên şeş rêz pêk tên.
**Heftane** : musebba'. Ji bendên heft rêz pêk tên.
**Hestane** : musemmen. Ji bendên heşt rêz pêk tên.
**Nehane** : mustessa. Ji bendên neh rêz pêk tên.
**Dehane** : mueşşer. Ji bendên deh rêz pêk tên.
**Çaranekirî** : terbi'. Bi du rêz zêdekirina li malikên xezela şairekî dinê çêkirina çarane ye.
**Çaraneya hevrêz** : çaraneya ku rêza çaran a benda pêşî di dawiya her bendî de tê tekrar kirinê.
**Çaraneya hevbesavend** : çaraneya ku rêzên dawîn ên her bendê bi rêza dawî ya benda pêşî re hevbeşavend e.
**Serdeyî** : ji bona çêkirina çaranekirî(an pêncanêkirî, şeşanekirî, ... dehanekirî) li serê malikên xezela dê bê çaranekirin (û yên din) zêdekirina bi du rêzan e. Di pêncanekirinê de sê, di dehanekirinê de heşt rêz tên zêdekirin.
**Nêvdeyî** ji : bona çêkirina çaranekirî (an pêncanekirî... dehanekirî) di nav rêzên malikên xezela dê bê çaranekirin (an yên din) zêdekirina bi du rêzan e. Di pêncanekirinê de sê rêz, di dehanekirinê de heşt rêz lê têne zêdekirin.
Numûne

- - - - - - - - - - - -
- - - - - - - - - - - - - malika xezela ecibandî

x x x x x x x x x x x x x x x x
x x x x x x x x x x x x x x x x du rêzên çaranekirinê yên şair

x x x x x x x x x x x x x x x x
x x x x x x x x x x x x x x x x (serdeyî)
- - - - - - - - - - - - - - -
- - - - - - - - - - - - - - - çaranekiriya serdeyî
- - - - - - - - - - - - - -
x x x x x x x x x x x x x x x x
x x x x x x x x x x x x x x x x (nêvdeyî)
- - - - - - - - - - - - - - çaranekiriya nêvdeyî

**Pêncaneya nehevbesavend** : terdiye. Pêncaneya ku rêzên pêncan ên bendan ne hevrêz in û ne jî hevbeşavend in.

**Vegerbend** : terci'î bend. Teşeyek ji teşeyên nezma dîwanê ye ku ji bendan pêk tê. Her bend bi drûv mîna xezelê ye û malika dawîn a benda pêşî di nav xwe de hevbeşavend e, ku ev malik(vegermalik) di pey her bendê de bêguhartin tê.
**Vegermalik** : malika di dawiya bendên vegerbendê de ye, ku erka wê bi vegera li ser benda pêşiyê bendan bi hev ve girêdide.
**Girêbend** : terkîbî bend. Wek vegerbendê ji bendan pêk tê. Malikên di dawiya her bendê de bi serê xwe hevbeşavend e û erka wê girêdana du bendan e.
**Girêmalik** : malikên di dawiya bendên girêbendê de nê.
**Hunerên edebî** : hunerên gotin û vegotinê ne.
**Hevdengî** : hunerê hevdeng çêkirinê (binêre li hevdeng).
**Hevreh** : hunerê bikaranîna gotinên ji rehekê ye.
**Pircare** : tekrîr. Ji bona xurtkirina tesîra gotinê, hin gotin an hevokan pir car dîsakirin e. Herwekî «merheba» yên di Mewlûdê de.

*Merheba ey sirrê Furqan merheba*
*Merheba ey derdê derman merheba*

*Merheba ey canê baqî merheba*
*Merheba 'uşşaqê saqî merheba*

*Merheba ey alî sultan merheba*
*Merheba ey kanê 'irfan merheba*
(Melayê Bateyî)

**Jêwergirtin/Jêveguhastin** : îqtîbas. Ji bona bihêzkirina gotina xwe, bikaranîna gotinek ji yekî dinê ye. Di edebiyata dîwanî de ev bi piranî bi bikaranîna ayetek an hedîsekî pêxember dihate kirin.
**Pêç û belav** : lef û neşir. Berê vebîrandina du an çend tiştan e, û di pey de gotina tiştên ku girêdayê bi wan ve ne. Bi vî awayî sîmetriya bêjeyan tê çêkirin.

*Bes niye her dil te xûyê Pîrê Sen'anî mesel*
*Bendê benda kafirê bê dîn û bê îmanekê.*
(Pertew Begê Hekarî)

**Lêveger** : hunereke edebî ye, ku meriv gotina dawîn, an gotineke bingehîn a dawiya rêza an malika berê di serê rêza an malika nû de dubare dike û bi vê, li rêza an malika berê vedigere.

. . . .
*Berê xwe da bi min carêk hilîna xadimê çarik*
*Me dît hilbû ji wê nalek çi ku zêra **şefeq dabû***

***Şefeq dabû** me qenc dîtin guhar û berben û tîtin*
*Mixalif new' û texlît in, **muresse'** cumle lêdabû*
***Muresse'** teyr û qemçî ne, rex û rex belg û rêşî ne*
*Hemî zêr û mirarî ne, li ser eniyê temenna bû.*
. . . .
(Bekir Begê Erzî)

**Nezaniya bi zanîn** : tecahul ul-'arif. Tevî ku meriv bi rastiyê dizane lê ji bo zêdekirina hêza pêjnê, xwe li nezanî datîne.

*Xoceyê Xidrî xelet çû kaniya ava heyat*
*Lêvê le'lê te y' şeker-rêz bê guman ew kanî ye.*
(Cegerxwîn)

**Xwesbehane** : husnî ta'lîl. Bûyîna tiştekî an bûyerekê, ne bi sedemê wê yê rastîn, lê bi bahaneke xweş nîşandayin e.

*Telbe kir weslê ji dilber me bi 'inwanî zekat*
*Go tu ebd î û bi ebdê xwe zekatê nadim.*
(Melayê Cizîrî)

**Kesandin** : teşxîs. Kesayetiya(şexsiyet) mirovan dayina tiştên neheyber wekî dar û ber, û heywanan e. Di şi'r û çîrokan de heywan, û tiştên ne heyber(bi ruh) wek ku xwedî kesayetiya mirovîn bin, ango wek mirov bin bi mirovan re didin û distînin an wek mirovan dilivin.

*Tawis bi wî şiklê melîh şermendeyê saqê di reş*
*Ew qijika gûxwir binêr, qîj qîj dikit»elwan im ez»*
(Axayok)

Şermendebûn(berxweketin) û pesindarî taybetiya mirovan e, perçekî ji kesayetiya mirovan e ku bi heywan û tebayan re peyda nabe. Lê li vê derê şair kesayetiya mirovan daye tawis û qijikê ku tawis şermî û qijik jî qure ye.
**Peyivandin** : întaq. Heywan û heyînên neheyber wekî ku mirov bin, bi peyivîn dayin e.

*Rovî gotê ez xulam Ji Kurdistan heya Şam*
*Min nedîn wek gurê zer Bê mêjî û zirt û ker*
(Roviyê Jîr-Osman Sebrî)

**Lihevî** : tenasub. Bi hev re bikaranîna du an çend gotinên ku ji aliyê mane, babet an cureyî ve têkiliya wan bi hev re hebin.

*Serxweşê cama şerbetê dêm şubhê şem'a zulmetê*
*Horiya d'baxê cennetê serdarê çendîn mehweş e.*
('Eliyê Herîrî)

Di vê malikê de serxweş - cam(piyan) - şerbet(mey), şem'(find) - zulmet(tarî), horî - baxê cennetê û mehweş(mîna hîvê/heyvîn) ji aliyê mane, babet û cureyî ve têkildar in.
**Pirs** : Ne ji bona bersîv stendina tiştekî ku meriv pê nizane, lê ji bona balkişandin û xurtkirina pêjnê hunera gotinê ya bi riya pirsê ye.

*Ew çi bejn e, ew çi qamet, ew çi qedd e, dilruba?*
*Ew çi exbar in, te can de, ew çi durr in, pur buha?*
*Ew çi narinc û turunc in, ew çi sêv in, sîneca?*
*Ew çi mehtab in, binagûş, ew çi subh e, nûrfeza?*
*Rohniya şama firaqê, şem' û mala kê yî tu?*
(Macin)

# Kî pê dizane?

Gelo kî ji we bi zimanekî ewropî an rohelatî navên dar an kulîlkên jêrîn dizane? Yên ku dizanin bila ji kerema xwe ra ji *Kurmancî* re binivîsînin, arîkariya me bikin.

Ji niha ve spas.

**kinêr** : darek e ku donê wê di bîrovê didin û ew sax dike.

**masîjark** : giyayê ku ji bo girtina masiyan bi kar tînin. Li aliyê Hekariyê jê re ***masîcark*** dibêjin, bi bejn e û tayê wê stûr e, havînî û demî ye.

Hun meyweyek bi navê ***germox*** an ***zersik***, kulîlkek bi navê ***xemla bûkê*** dinasin?

hejmar 8 zivistan 1991

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## BERLÎN II

Civîna heştemîn a li ser zimanê kurdî, zaravayê kurmancî li Almanya ya yekbûyî, li bajarê Berlînê civiya. Civîn pênc rojan, ji 10 heta 15ê kanûnê dom kir. Giraniya xebata vê civînê li ser termên dezgehên cotkarî, çandinî û navên pez û dewaran bû. Ji van pê ve civîn li ser dûmahîka termên edebî, anatomiya mirov, ferhengoka *Sewra Azadî* ya Cegerxwîn, a *Memê Alan* û ya kovara *Stêr*ê xebitî.

Hevalên ku beşdarî civîna pahîza 1990 an bûn, ev in: Khosrow Abdollahî (Selmas), Mahmûd Baksi (Xerza), Rojen Barnas (Diyarbekir), Muzeffer Begzade (Şikakan), Mûsa Kaval (Hekarî), Zeynelabidîn Zinar (Batman), Hazim Kılıç (Hekarî), Hemîd Kılıçaslan (Mêrdîn), Huseyin Kurdo (Amûd), Kendal Nezan (Diyarbekir), Zinar Soran (Mêrdîn), Mehmed Uzun (Siwêrek) û Reşo Zîlan (Agirî).

KURMANCÎ

## Termên çandiniyê li hêla Mêrdînê

*Amadekar : Zinar SORAN*

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilizî |
|---|---|---|---|
| cot | çift | charrue | plough |
| cotkarî | çiftçilik | agriculture | agriculture |
| cotkar | çiftçi | cultivateur | farmer |
| erd | arazi | terre, terrain | earth, ground |
| erdê avî | sulak arazi | terre irriguée | irrigated land |
| erdê beji | kurak, susuz arazi | terre non irriguée | non irrigated land |
| erdê best | kumlu yamaç arazisi | terre sablonneuse | sandy soil |
| erdê qiraç, xîç | kıraç arazi | terrain friche | waste land |
| erdê beyar | boş bırakılmış, ekilmemiş arazi | terre non cultivée | uncultivated land |
| erdê bûr | başıboş arazi | terre abandonnée | abandoned land |
| erdê kirêb | bir kez sürülmüş tarla | champ labouré une fois | field ploughed once |
| şûv / şov | ekime hazır tarla | champ prêt aux semailles | field ready for sowing |
| kat | ekilmiş fakat herhangi bir nedenle biçilmemiş tarlanın ertesi yıl sürülmeden kendiliğinden ürün vermesi | champ labouré et semé mais non récolté pour une raison quelconque, qui l'année suivante donne des récoltes sans être à nouveau labouré | ploughed and sown field but for some reason not harvested, which will yield a crop the year after without having to be ploughed again |
| zîl dan | çimlenmek | germer | to sprout |
| hêşîn bûn | yeşermek | verdir | to turn green |
| ketina beqê, avis bûn, pîk bûn | başağa durmak | amorce de formation des épis | initial forming of ears (corn, etc.) |
| seridîn, şîrik girtin | başaklanmak, başağın sütle dolgunlaşması | former des épis emplissage du tégument du grain | to form ears filling up of seed's integument |

*(dumahîk rûpel 3)*

## Termên Edebî

*Rojen Barnas*

**Niçlêdan** : taariz kirin. Bi mebesta tinaz pêkirinê an yekî piçûkxistinê an jî niçlêdanê, gotina xwe bi maneyeke bi temamî bervajiya wê gotinê gotin e. Herwekî ku ji yekî derengmayî re meriv bêje, ev çi heliza te bû tu çima ew çend zû hati.

**Niç** : taariz (t) *dokunma, taşlama* (f) *satire* (e) *satire.*
**Dirûvpêxistin** : Teşbîh. Du tiştên an kesên ku dirûvê wan bi hev kevin, dirûvê yê qels bi yê xurt xistin e. (t) *benzetme* (f) *allégorie* (e) *allegory.*
Herwekî: *Zozan wek gulekê xweşik e.*

**HÊMANÊN DIRÛVPÊXISTINÊ**: Çar hêmanên dirûvpêxistinê hene.

1. **Dirûvpêketî**: Muşebbeh. Yê dirûv pê dayî (yê qels). *Zozan wek gulekê xweşik e.* Zozan dirûvpêketî ye.
2. **Dirûvdar**: Muşebbehun bîh. Yê dirûv pê xistî (yê xurt). Zozan wek *gulekê* xweşik e. Gul dirûvdar e.
3. **Dirûv**: wechî şebeh. Aliyê an awayê dirûvpêketinê ye. Zozan wek gulekê *xweşik* e. Xweşik aliyê dirûvpêxistinê ye, dirûv e.
4. **Daçeka dirûvpêxistinê**: edatî şebeh: Zozan *wek* gulekê xweşik e. «Wek» daçek e û li vê derê daçeka dirûvpêxistinê ye. Ji bili «wek»ê daçekên dirûvpêxistinê ev in: mîna, nola, asa, misl, manend, weş, goya, sankî, meger, çawa, çendŞ

**CURÊN DIRÛVPÊXISTINÊ**:

1. **Dirûvpêxistina tevekî**: Teşbîhî mufessel: dirûvpêxistina bi her çar hêmanan e; dirûvpêketî, dirûvdar, dirûv û daçeka dirûvpêxistinê pêkve hene. Herwekî:

*Zozan wek gulekê xweşik e*.

2. **Dirûvpêxistina kurtane**: teşbîhî mucmel. Dirûvpêxistina ku bêî hêmana dirûv tê çêkirin. Herwekî: *Zozan wek gul e.*
3. **Dirûvpêxistina xurtkirî**: teşbihî muekked. Dirûvpêxistina ku bêî daçek tê çêkirinê. Herwekî: *Bi xweşikbûnê Zozan gul e.*
4. **Dirûvpêxistina rewan**: teşbîhî belîx: dirûvpêxistina ku bi tenê bi dirûvpêketî û dirûvdar tê çekirin. Herwekî: *Zozan gul e.*
5. **Dirûvpêxistina kurt**: teşbîhî mûcez: teşbîha bi gotinên herî hindik tê kirin.

*Hinarîk gul, temorîk gul*
*Çav û dev pêkve gulxonçe*
*Ne guldan e dilbera min*
*Lê gulîstan e, rinda min*.
(R.Barnas)

Di vê numûnê de: hinarîk wek gulê sor e, temorîk mîna gulê bi xweşbihn e, çav nola gulê geş e, û dev jî mislê gulê lihev, xwezîbij û dilkêş e. Ji van heryek bi awakî dişihibin gulê. Ev piranî jî dibe di gulekê de bi serê xwe peyda nebe, lê bi tenê di gulistanê de hebe.

6. **Dirûvpêxistina nimandî**: teşbiha temsilî. Di navbera dirûvpêketî û dirûvdar da carina gelek aliyê dirûvê hene ku hunerrmend ne bi tenê bi aliyekî lê bi gelek aliyên dirûvdayinê dirûvpêxistin çêdike. Ji vê dirûvpêxistinê re dirûvpêxistina nimandî tê gotin.

**Mecaz**: bikaranîna gotinê ya ji maneya wê ya bingehîn bi maneyeke dîtir e. (t) *mecaz* (f) *métaphore* (e) *metaphor*.
**Mecaza hinartî**: mecazî mursel : Bêî mebesta dirûvpêxistinê bikaranîna mecazê ye. (t) *mecazi mürsel* (f) *métonymie* (e) *metonymy*
**Îstiare**: dirûvpêxistina ku bi tenê an ji dirûvpêketî an jî ji dirûvdar pêk tê.
**Îstiara vekirî**: îstiareî musarraha. Îstiareya bê dirûvpêketî (muşebbeh) ye.
**Îstiara girtî** : Îstiareî mekniye: Îstiareya ku bê dirûvdar tê çêkirinê.
**Mezmûn**: îstiareyên vekirî ne. dêlva bejnê ve serw, dêlva çav ahû, dêlva bijang tîr, zulf: kafir, perîşan, dev: hoqe, nuqte.

**ÇEŞNÊN EDEBÎ**
(t) *edebi türler* (f) *genres littéraires* (e) *literary genres*

1. **Çeşnên bingehîn**: Ji bilî şi'rê li gora mebest û teknîkên xwe, ji sê koma pêk tên.
   a. **Çeşnê vegotinê**: Destan, çîrokên xeyalî (bi perî, dêw, cin), çîrokên gelêrî (serpêhatiyên mirovîn ên gelêrî); **fabl**: (çîrokên ku qehremanên wan rawir in), kurteçîrok, mesnewî, çîrokên hunerî (yên nivîskarî), roman.
   b. **Çeşnê rapêşiyê**: Çeşnên şanûgeriyê (tiyatroyê).
   c. **Çeşnê ramanî**: Nivîsarên wek bend, cêribandin ((f) *essai*), suhbet.
2. **Çeşnên alîkar**: Çeşnên alîkar hem di nav çeşnên bingehîn de wek hêmanek alîkar têne bikaranîn, hem jî bi serê xwe lixweser hene: Biografî (jînenîgarî), bîranîn, ger, name, gotar, rexnenivîs, dîrok.

**Destan**: (t) *destan* (f) *epopée* (e) *epic*
**Destanî**: (t) *destansal* (f) *épique* (e) *epic*
**Efsane** :(t) *efsane* (f) *légende* (e) *legend*
**Efsaneyi** : (t) *efsanesel* (f) *légendaire* (e) *legendary*
**Bend**: (t) *makale* (f) *article* (e) *article*
**Gotar**: (t) *nutuk* (f) *discours* (e) *speech*
**Cêribandin**: (t) *deneme* (f) *essai* (e) *essay*
**Dram**: Afirandina tiyatroyê ya dilpêşewitîn û pêkenîn pêkve ye (t) *dram* (f) *drame* (e) *drama.*
**Dramnivîs**: Nivîskarê dramê.
**Komedî**: Afirandina tiyatroyê ya pêkenînê ye.
**Komedînivîs**: Nivîskarê komediyê .
**Trajedî**: Afirandina tiyatroyê ya dilpêşewatê ye.
**Trajedînivîs**: Nivîskarê trajediyê.
**Şanûgerî** : Tiyatro.
**Şanû**: (t) *sahne* (f) *scène* (e) *stage*
**Şanûger**: Lîstikvanê tiyatroyê.
**Ramana sereke**: Di nivîsarekê de fikra esasî, fikra bingehîn. (t) *ana fikir* (f) *idée principale* (e) *main idea.*
**Hevtîp**: (f) *Anagramme*. Hunera bikaranîna gotinên ku tîpên wan wek hev in, lê mane û xwendina wan cihê ye. Herwekî : Selma û Elmas, Nisan û Nasîn, Ber û Reb.
**Deredemî**: Hunera bûyerekê an kesekî bi zanîn di tarîxeke dîtir de nîşan dayin (f) *anachronisme*.
**Bênav**: Nivîsarên ku nivîskarên wan ne diyar in, û wek malê gel gişt bi kar tînin. Çîrokên bênav; çîrokên gelêrî. (t) *anonim* (f) *anonyme* (e) *anonymous*.
**Bênavî** : (t) *anonimlik* (f) *anonymat* (e) *anonymity.*
**Navber**: Di leyistika tiyatroyê de navbera du perdeyan (t) *fasıla* (f) *entracte* (e) *intermission.*
**Peyvnasî**: termînolojî.
**Vegotin**: (t) *anlatmak* (f) *conter, raconter* (e) *to relate, to tell*.
**Çîrok**: (t) *hikaye, masal* (f) *conte* (e) *tale, story.*
**Çîrokbêj**: (t) *masal, hikaye anlatan*
**Rapêşî**: (t) *gösteri* (f) *représentation* (e) *performance*.
**Rapêş kirin** : (t) *temsil etmek* (f) *représenter* (e) *to perform.*
**Leyîzvan, lîstikvan**: (t) *oyuncu* (f) *acteur, comédien* (e) *actor, comedian.*
**Şadîk**: (t) *eğlendirici* (f) *amuseur, divertisseur* (e) *entertainer.*
**Hevmane**: (t) *eşanlamlı* (f) *synonyme* (e) *synonymous*.

| | | | |
|---|---|---|---|
| *(dumahîka rûpela 1an)* | | | |
| kulîlkdan, şalik girtin | (baklagiller) tanenin sütle dolgunlaşması | emplissage du tégument des grains de légumineuses | filling up of integument of leguminous plant's seed |
| zer bûn, zergulî bûn | sararmak | blondir, mûrir | to turn golden, to ripen |
| xubarî | yağmur öncesi tohum ekme | semailles avant les premières pluies | sowing before rainfall |
| gîsnê zêr | yağmur sonrası yabani otların yeşermesi ardından sürüm ve ekim | labourage et semailles après les pluies et la pousse des herbes sauvages | ploughing and sowing after rainfall and growth of wild grasses |
| gîsnê reş | yeşerme ile birlikte don ve ayazın vurduğu ekin | récolte atteinte par les gelées | harvest affected by frost |
| serav | yağmur sonrası ekim | semailles d'après les pluies | sowing after rainfall |
| bizar kirin / tov kirin / çandin | ekmek | semer | to sow |
| bizir / tov | tohum | semence | seed |
| zad / tene | tane, tahıl | grain | seed |
| çinîn / dirûn | biçim, biçme | récolte, moisson | harvest, crop |
| paleyî | orakçılık | métier de moissonneur | harvester's trade |
| pale | orakçı | moissonneur | harvester |
| serpale | başorakçı | moissonneur en chef | chief harvester |
| dûpale | artçı orakçı | aide-moissonneur | harvester's help |
| qefil | bir kaç desteden oluşan demet | gerbe formée de quelques javelles | sheaf made up by several swathes |
| qefilvan | demet toplayıcı | ramasseur de gerbes | collector of sheaves |
| liqat | oraktan kurtulmuş başakları elle koparma işi | glane | handful of ears left over after the sheaves have been collected |
| liqatvan | liqat işini yapan | glaneur, glaneuse | person who picks up leftover ears in the field |
| berdas | bir oraklık alan | édendue de champ pouvant être récoltée d'un coup de faucille | expanse of field ready for harvesting by sickle |
| dîk | oraktan kurtulmuş başak | épi non coupé par la faucille | ear which is not cut by sickle |
| şixre, kişre | sapları harmana taşıma işi | transport des épis vers l'aire de battage | transport of ears to threshing area |
| darşixre | sap yükleme askısı | cadre de bois à deux versants que l'on met sur le bât des bêtes de somme pour le transport du foin | two sided wooden frame which is put on packsaddle to carry hay |
| şixrevan | harmana sap taşıyan | tranporteur de foin ou d'épis de céréales | person who transports hay or cereals' ears |
| selb, sepl, darcêrk, xerek | su, taş, v.b hayvanla taşımada kullanılan askı | cadre de bois que l'on met sur le dos des bêtes de somme pour le transport d'eau, de pierres etc. | wooden frame which is put on packsaddle to carry water, stones etc. |
| qûncêrk | testilik, testi konulan ağaçtan veya topraktan yapılmış özel yer | porte-cruches en bois ou en terre cuite | wooden or earthenware jug carrier |
| qalûçik, şalok | küçük orak | faucillon | small sickle to cut kindlings |
| qeynax | orakla biçmede sol ele geçirilen parmaklıklı biçim yardımcı aleti | protège-main des moissonneurs | harvester's hand protection |
| tar | tahtadan yapılmış «S» biçimindeki orakla biçimde sol ele geçirilerek kullanılan biçme yardıkcı aleti | instrument en bois en forme de "S" que le moissonneur met dans sa main gauche pour tenir l'herbe ou le foin qu'il vient de couper par la faucille de sa main droite | wooden tool in the shape of an "S" that the harvester keeps in his left hand to hold the grass or the hay which he just cut with the sickle in his right hand |
| kosere, xarik | yumuşak bir tür zımpara taşı | variété de pierre ponce | variety of pumice stone |
| heste | bileme demiri | fer à affûter | sharpening or grindingiron |
| hesan | bileyi taşı | pierre à aiguiser | sharpening or grinding stone,whetstone |
| sêgulî | üçlü çatal | fourche à 3 branches | 3 pronged pitchfork |
| bolvir | bir tür iri elek | tamis à grosses mailles | wide meshed sieve |
| serad | tane, saman v.b elemede kullanılan iri gözlü elek | tamis à grosses mailles servant à séparer le grain de la paille | wide meshed sieve used to separate the grain from the straw |
| bêjing | tane elemede kullanılan elek | tamis à grains | grain sieve |

| | | | |
|---|---|---|---|
| moxil, elek | un eleği | tamis à mailles fines pour séparer le son de la farine | fine meshed sieve to separate the bran from the flour |
| şel, xeşe | kilim v.b yaygıları ilmek suretiyle yapılan ve tütün pamuk v.b taşımada kullanılan geçici büyük çuval | gros sac sommaire de transport de coton et de tabac | large coarse sack for transport of cotton and tobacco |
| ferd | yükte iki çuvaldan her biri | grand sac en poils de chèvre | large goatskin bag |
| têr | heybe biçimimde çok uzun ve büyük taşıma aracı. | grand bissac | large shoulder bag |
| xeş | *bkz.* şêl | voir şêl | see şêl |
| çewal | çuval | sac à céréale | cereal sack |
| telîs | kenevirden yapılmış çuval | çewal en chanvre | hemp çewal |
| xirar | kıldan kaba dokunmuş, sama v.b taşımada kullanılan büyük çuval | gros çewal sommaire en poils de chèvre pour le transport de la paille | large coarse goatskin çewal for the transport of straw |
| xurc | heybe | besace | beggar's bag |
| tûr | torba | sac | bag |
| selik | sepet | panier | basket |
| sakar | saman taşımada kullanılan çok büyük sepet | hotte généralement utilisée dans le transport de la paille | basket carried on the back for transport of straw |
| çetik | askılı omuz çantası | sacoche | shoulderbag |
| çal | buğday, arpa v.b saklamada kullanılan ve özel bir biçimde yapılan kuyu, çukur | silo creusé dans la terre pour la conservation s des céréales | silo dug in the earth for preservation of cereals |
| risil | ev içinde, dizboyu bir duvarla çevrili olup hububata ayrılmış yer | aire d'emmagasinage des céréales, entourée d'un muret | cereal storage area enclosed by low wall |
| kadîn | samanlık | pailler, hangar à paille | straw shed, straw barn |
| lod | dışarda özel bir biçimde saklanmak üzere istif edilmiş ve üstü, çevresi rüzgar ve yağmura karşı korunmuş saman ve ot yığını | meule de paille ou de foin entourée d'une protection contre les intempéries | stack of straw or haystack surrounded by protection against bad weather |
| giyadîn | otluk | hangar à foin | hay barn |
| bênder hûr kirin, gêre kirin | harman döğmek | battre les céréales | to thresh cereals |
| bênder ba kirin | harman savurmak | éventer les céréales, après le battage, pour séparer les grains de la paille | to air cereals after threshing in order to separate grain from straw |
| palûte, zibare | imece | travail collectif des paysans au moment des moissons | collective farmers' labour at harvest time |
| pûş, kaş | kendi kendine kurumuş ot | herbe sèche non fauchée | uncut dry grass |
| sap, kulêş | kırılmamış kuru ot | herbe sèche non hâchée | unchopped dry grass |
| qersele, qesel | tırılmış buğday, arpa v.b sapları | tiges fauchées des céréales | mown cereal stalks |
| kûzir, kozere | harman artığı iri çer çöp | débris de tiges, balayures de l'aire de battage | small pieces of stalk, sweepings of threshing area |
| qerme, belim | kırılmış, dövülmüş sap | tiges de céréales fauchées, hâchées lors du battage | mown cereal stalks, chopped while being threshed |
| ka | saman | paille | straw |
| hûre, pixmik | saman tozu | poussière de paille | strawdust |
| kapek | kepek | son | bran |
| kumik, çet | kabuklu tane | grain non séparé du son | grain not separated from bran |
| cêz, paqij, şûş | rüzgarda savurulmuş buğday | blé séparé de la paille par l'éventage | wheat separated from straw during airing |
| sercêz, serşûş | rüzgarda savurulduktan sonra temiz hububat kümesi | amas de grains les mieux séparés de la paille après l'éventage | heap of grain best separated from straw after airing |
| kesmûk, kêzmûk | kılçıklı saman | paille contenant la barbe des épis | straw containing beard of corn ears |
| bijî | başak kılçığı | barbe des épis | beard of corn ears |
| berba | savurma esnasında ayrık düşen tane, taneler | grains tombés à l'écart lors de l'éventage | grain which fell aside during airing |
| ifare, binbêder | harman artığı | restes du battage et d'éventage des grains | remnants of grain after threshing and airing |
| şeqil kirin, | hububat yığınını damgalamak, | marquer d'un sceau l'amas de | to put a seal on heap |

| | | | |
|---|---|---|---|
| dêç kirin | işaretlemek | grains avant son partage | of grain before it is separated |
| firîk | firik, henüz sararmamış fakat dolgun tanelilik hali | grain formé mais encore immature | formed grain but still immature |
| şewibîn, şihibîn, rewiqîn, çirijîn | sıcaktan tanenin olgunlaşmadan büzülerek kuruması | grain brûlé par la chaleur avant d'être arrivé à maturité | grain burnt by heat before coming to maturity |
| melêvayî, sêparî, sêkutî | marabalık | métayage | sharecropping |
| melêva, melêvçî | maraba | métayer | sharecropper, tenant farmer |
| kerax | topraksız olup toprak sahibi tarafından ailesiyle birlikte beslenen hizmetkar köylü | paysan sans terre entretenu avec sa famille par le propriétaire foncier en échange de son travail | farmer without land supported with his family by landowner in exchange for his labour |
| keraxî | topraksız köylünün hizmet karşılığı toprak sahibi tarafından beslenmesi | contrat liant un kerax à son seigneur | contract binding a kerax to his landlord |
| deraxe | üstüste istif edilmiş biçili tahıl demetleri | meule de gerbes de céréales superposées | stack of piles of cereal sheaves |
| deman | icar | location, louage | renting |
| deman kirin | icar etmek | louer | to rent |
| çeltûk | çeltik | riz non décortiqué | rice in the husk |
| çewlîk | ırmak dirsekleri arasındaki alüvyonlu toprak | terre enrichie par des alluvions | soil enriched by alluvial deposits |
| qîş | tarla veya arazideki volkanik iri ve büyük yassı taş | rocher ou bloc de pierre volcanique | vulcanic rock or stone block |
| qûç | tarlada üstüvanevi istif edilmiş taş yığını | amas de pierres dans un champ | heap of stones in field |
| şikêr | duvar tarzında üstüste harçsız ve iğreti istif edilmiş taş dizisi | muret formé par la superposition, sans ciment, de pierres | small wall formed by piling up stones without cement |
| tîr | ince ve uzun tarla parçası | segment étroit et long d'un champ | narrow and long segment of field |
| sed, kos | bir sürüm hattı | sillon | furrow |
| sersed | bir sürümlük hattın bitim ucu | le bout du sillon | furrow's end |
| sel | geniş yayvan büyük taş | bloc de pierre large et plat | large flat stone block |
| qode | ekilmemiş olup otlamaya bırakılmış tarla | champ non labouré utilisé comme pâturage | unploughed field used as pasture |

# Navên pez û dewaran

*Amadekar* : Hazim KILIÇ

| NAVÊN PEZ Û DEWARAN | HAYVAN ADLARI | NOMS D'ANIMAUX | NAMES OF ANIMALS |
|---|---|---|---|
| Pez | küçükbaş hayvanlar | ovins | ovine race |
| Pezên spî | koyun türü | mouton | sheep |
| Bêçî | 1-3 haftalık kuzu | agneau âgé de 1 à 3 semaines | lamb 1 to 3 weeks old |
| Berx | kuzu | agneau | lamb |
| Kavir | 6 ay - 1 yaşındaki kuzu | agneau âgé de 6 mois à 1 an | lamb 6 months to 1 year old |
| Berindir, şek | 1 - 2 yaş (erkek) | agneau âgé de 1 à 2 ans | lamb 1 to 2 years old |
| Berindîr, berdîr | 1 - 2 yaş (dişi) | agnelle âgée de 1 à 2 ans | (she) lamb 1 to 2 years old |
| Hogiç | 2 yaş ve büyük koç | jeune bélier, âgé de plus de 2 ans | young ram over 2 years old |
| Xanberingdir | 2 - 3 yaş koyun | jeune brebis âgée de 2 à 3 ans | young ewe 2 to 3 years old |
| Mih | koyun | brebis adulte, mouton | adult ewe, sheep |
| Beran | koç | bélier adulte | adult ram |
| Beranê qert | yaşlı koç | vieux bélier | old ram |
| Beranê kol | boynuzsuz koç | bélier sans corne | hornless ram |
| Beranê binûjik | küçük boynuzlu koç | bélier à cornes courtes | ram with short horns |
| Beranê kel | tohumluk koç | bélier-étalon | stud ram |

| | | | |
|---|---|---|---|
| Maz, hogiç dibe maz | olgun koç | bélier d'âge mûr | middle-aged ram |
| Tirmaz, maz dibe tirmaz | yaşlı koç | bélier âgé, vieux | elderly, old ram |
| Pezê reşe | keçi türü | caprinés | caprine race |
| Karik | oğlak | cabri, bicot, chevreau | kid |
| Gîsk | 6 aylık - 1 yaşında oğlak | chevreau âgé de 6 mois à 1 ans | kid 6 months to 1 year old |
| Kûr, hevûrî | 1 - 2 yaşında (erkek) | biquet, chevreau mâle entre 2 et 3 ans | male kid 2 to 3 years old |
| Seyis, hevûrî | 2 - 3 yaşında (erkek) | jeune bouc âgé de 2 à 3 ans | young goat 2 to 3 years old |
| Tiştîr | 1 - 2 yaşında (dişi) | biquette âgée de 1 à 2 ans | (she) kid 1 to 2 years old |
| Bizaştîr | 2 - 3 yaşında (dişi) | chevrette âgée de 2 à 3 ans | young (she) goat 2 to 3 years old |
| Bizin | keçi | chèvre | (she) goat |
| Nêrî | teke | bouc | billy goat |
| Qertenêrî | yaşlı teke | vieux bouc | old billy goat |
| Çûr, bizina çûr | tiftik keçisi | chèvre d'Angora | Angora goat |
| Merez | tiftik kılı | poils de mohair | mohair |
| **DEWAR** | **BÜYÜKBAŞ HAYVANLAR** | **BOVINS** | **BOVINE CATTLE** |
| çêlek | sığır | vache | cow |
| Golik | buzağı | veau | calf |
| a) Golikê sersing | buzağı | veau nourri au lait | milk-fed calf |
| b) Golıkê yekgaranî, parone | bir yaşında dana | bouvillon âgé d'1 an | bull-calf 1 year old |
| c) Mozîk | dana | bouvillon âgé de plus d'1 an, taurillon | bull-calf over 1 year old |
| Canega, conega | boğa | taureau | bull |
| Nehgan, nogin | genç inek | génisse | heifer |
| Ga | öküz | böuf | ox |
| a) Boxe, moc | boğa | taureau adulte | adult bull |
| b) Gayê cot | çift öküzü | böuf de labour | ox |
| Çêl; çêlek, manga | inek | vache | cow |
| **NAVÊN TAYBETÎ YÊN JIYANA PEZ Û DEWARAN** | **BAZI ÖZEL HAYVANCILIK TERİMLERİ** | **CERTAINS TERMES D'ELEVAGE** | **BREEDING TERMS** |
| Durhî, dirûşm, dirûf | damga | marque | branding |
| Avis | gebe | grosse | pregnant |
| Stawr | sütten kesilmiş, steril | qui ne donne plus de lait, stérile | milkless |
| Ber | zuriyet | progéniture, descendance | progeny, offspring |
| Kû, ko | sıcakta koyunların ardarda ve küme halinde biribirine sokulması | attroupement des moutons aux heures chaudes de la journée | flocking together of sheep at the hottest moment of the day |
| Mexel | hayvanların gündüz dinlenmesi ve üstü açık dinlenme yeri | aire de repos diurne pour le troupeau | herd's diurnal resting area |
| Hevşî | küçük başhayvanların gece dinlenmesi ve üstü açık dinlenme yeri | aire de repos nocturne pour le troupeau | flock's nocturnal resting area |
| Gihor, guher | yamaçlardaki koyak biçimindeki düzlük | petit plateau à flanc de montagne | small plateau on mountain side |
| a) Hevşiyê hingorî | akşam dinlenmesi sabaha | repos nocture | nocturnal rest |
| b) Hevşiyê berêspêdê | yakın dinlenmesi | repos du petit matin | rest at daybreak |
| ∑evîn: | gece otlatması | pâturage nocturne | nocturnal grazing |
| Palîn, alinc | sabah, öğle, akşam otlatması | pâturage du matin et de la journée | early morning and diurnal grazing |
| Çere, çêre | otlatma, otlak | pâturage | pasture |
| Têştxwer, taştêkirin: | sabah yemi, sabah otlatması | fourrage du matin, pâturage du matin | morning fodder, morning grazing |
| ∑îvxwer, şîvkirin: | akşam yemi, akşam otlatması | fourrage du soir, pâturage du soir | evening fodder, evening grazing |
| Koz, kozik: | üstü açık, etrafı çevrili kuzu ağılı | parc clôturé pour agneaux | closed off lamb pen |
| Gov, gom: | üstü kapalı küçükbaş hayvan ağılı | bergerie | sheep pen |
| Arguherî: | dinlenmeden sonra hareket ettir-mek, sidik ve dışkısını ettirmek maksadıyla ve tekrar yatırılmak üzere sürünün gezdirilmesi | promenade effectuée après le repos pour permettre aux bêtes de faire leurs besoins hors de l'aire de repos | walk after rest in order to enable the animals to relieve themselves away from their resting area |

| | | | |
|---|---|---|---|
| Kotan | üstü açık koyun ağılı | parc à moutons | sheep pen |
| Bêr, bêrî | kırda sürü sağımı | traite des brebis dans la nature | milking of ewes in the open |
| Dohtin, dotin | sağma, sağmak | traire | to milk |
| Guhan | hayvan memesi | pis | udder |
| Çiçik, sertîr | meme ucu | trayon | milking nipple |
| Dûng, dûv | koyun türünde geniş ve yayvan kuyruk | queue grasse du mouton | fat tail of sheep |
| Daw | koç kuyruğu | queue du bélier | tail of ram |
| Kerî | sürü | troupeau | flock |
| Dûnhe | kar üzerinde küçükbaş hayvanlara yem verilmesi | action de donner du fourrage sur la neige aux ovins | action of giving fodder on the snow to ovine animals |
| Berxşo | temmuzda kuzu yıkama | lavage des agneaux en juillet | washing of lambs in July |
| Berxbir | temmuzda kuzu kırkma | tonte des agneaux en juillet | shearing of lambs in July |
| Pezbir | Mayıs ve Haziranda koyun kırkma | tonte des moutons en mai et juin | shearing of sheep in May and June |
| Bizinbir | ağustos ve Eylül ayında keçi kırkma | tonte des chèvres en août et septembre | sshearing of goats in August and September |
| Cew, hevring | kırkma makası | forces, ciseaux de tonte | shears |
| Cewêz | kırkıcı, kırkma işini yapan kimse | personne qui pratique la tonte | shearer |
| Hişar | kırda büyükbaş hayvanlar için yapılan etrafı çevrili, üstü açık yer | parc clôturé à bovins | cattle enclosure |
| Kurmizk, boçik, qemçik | keçi türünde kuyruk | queue des capridés | tail of caprine animals |
| Kel | boğa | taureau | bull |
| Revî | binek hayvanlarının kırda kendi başına başıboş kalanlar | chevaux sauvages | wild horses |
| Hey | binek hayvanlarından birini veya birkaçını başıboş çöle salmak, terketmek | lâcher des chevaux dans la nature | to let horses loose in the open |
| Hawî, avî: | sürüden ayrılıp bir süre kırda başıboş dolandıktan sonra kendiliğinden sürüye katılan küçükbaş hayvanlardan biri veya birkaçı | groupe de bovins qui après avoir quitté le troupeau et erré quelques temps dans la nature rentrent au bercail | groupe of bovine animals coming back to the fold after leaving the herd and wande-ring around for some time |
| garan | nahır, büyükbaş hayvan sürüsü | troupeau de bovins | herd |
| mozirganî, binêre hişar | *bkz.* hişar | | |
| **ÇEND CINSÊN PEZ** | **BİRKAÇ KOYUN TÜRÜ** | **QUELQUES ESPECES OVINES** | **SOME OVINE SPECIES** |
| Pezê qerqaş | akkoyun | mouton blanc | white sheep |
| Pezê hûrik | yüzü kırmızımsı kulakları küçük ufak yapılı bir koyun türü | race de mouton à museau rougeâtre, à petites oreilles, de petite taille | breed of small-sized sheep with reddish muzzle and small ears |
| Pezê riser | koyu kırmızı-kahvemsi, uzun kulaklı, uzun yapağılı iri yapılı koyun türü | race de mouton à toison marron aux oreilles longues, bien en chair | breed of well-padded sheep with brown fleece and long ears |
| Pezê sereş | kara başlı koyun türü | mouton à tête noire | sheep with black hair |
| Pezê tebeş, beş | kafası alacalı (kırmızı veya kara ile ak) koyun türü | mouton à tête pie | sheep with black and white head |
| Pezê sîs | yüzü, kafası ve kirpikleri tümden beyaz olan koyun türü | mouton à tête blanche | sheep with white head |
| Pezê qer | karakoyun. Baştanbaşa kara renkte olan koyun türü | mouton noir | black sheep |
| Pezê sor | kırmızı-kahvemsi renkte olan, iri yapılı, eti lezzetli bir koyun türü | mouton charnu à toison alezane dont la viande est très appréciée | fleshy sheep with chestnut fleece whose meat is greatly appreciated |
| Pezê hemdanî | uzun ve yassı kulaklı bir koyun türü | race de mouton aux oreilles longues et rondes | breed of sheep with long round ears |
| **HESP Û MEHÎN** | **AT VE KISRAK** | **CHEVAL ET JUMENT** | **HORSE AND MARE** |
| Kurik | yavru tay | poulain âgé de quelques mois | foal a few months old |
| Canî | tay | poulain | foal |

| | | | |
|---|---|---|---|
| Canîhesp | erkek tay | poulain mâle | male foal |
| Canîmehîn | kısrak tay | pouliche | filly |
| Nûzîn, berzîn | dört yaşında ve eyerlemeye erişkin at | cheval âgé de 4 ans prêt à être sellé | four year old horse ready to be saddled |
| Mehîn | kısrak | jument | mare |
| Hesp | at | cheval | horse |
| Bargîr | beygir, yük atı | cheval de somme | packhorse |
| Hespê fal | tohumluk at, döl atı | étalon | stallion |
| Exte, axte | burulmuş at | hongre | gelding |
| Hêstir | katır | mule | mule |
| Ker | eşek | âne | donkey |
| Ker, nêreker | erkek eşek | âne mâle | ass (male) |
| Maker, manker | dişi eşek | ânesse | she-ass |
| Cehşik, daşik, caş | sıpa | ânon, bourricot | ass's foal |

# Dezgehên cotkariyê li aliyê Şikakan




*Amadekar* : Mizeffer BEGZADE

| DEZGEHÊN COTKARIYÊ LI ALIYÊ ŞIKAKAN | ŞIKAK BÖLGESİNDE KULLANILAN TARIM ARAÇLARI | TERMES AGRICOLES DANS LA REGION DES SHIKAKS | FARMING TERMS USED IN THE REGION OF THE SHIKAKS |
|---|---|---|---|
| Cot | karasaban | charrue | plough |
| 1. gasin | karasaban demiri | soc | ploughshare |
| 2. dend / pêcat: | yatay gövde | partie horizontale du bâti de la charrue | horizontal part of plough's frame |
| 3. baskêş | karasaban oku | flèche de la charrue | plough's beam |
| 4. şûrê cot | keski | coutre | coulter |
| 5. hêş | dikey gövde | partie verticale du bâti de la charrue | vertical part of plough's frame |
| 6. destikê cot | karasaban kabzası | poignée de la charrue | plough handle |
| 7. Gele | sürgü | pêne, verrou | bolt |
| 8. Kunesim | sürgü deliği | mortaise | mortise |
| Hêşevan | karasaban sürücüsü | conducteur de la charrue | plough driver |
| Nîrevan | çift hayvanlarını yönlendirici | celui qui guide les bêtes de labour | person who guides plough animals swivel plough |
| Kotan | pulluk | brabant | half-twin plough |
| 1. Textê kotanê | döküm levhası | planche du brabaut | swivel plough board |
| 2. Gasin | uç demiri | soc | ploughshare |
| 3. ∑ûrê kotanê | keski demiri | coutre | coulter |
| 4. Zinê kotanê | karık tekerleği | roue de sillon | furrowing wheel |
| 5. Tekerê zînê kotanê | arazi tekerleği | rotavator, fraise rotative pour régénérer la terre | drilling wheel used to regenerate the soil |

| | | | |
|---|---|---|---|
| 6. Kunesim | çekme deliği | gâche, mortaise | striking plate, mortise |
| 7. Çengale û kulabe | çeki çengeli ve halkası | crampon et anneau de traction | traction cramp and ring |
| 8. Destkêş | şasi | châssis | sub-frame |
| 10. Çopan | çeki zinciri ve kancası | châne de traction | traction chain |
| 1. Nîr | boyunduruk | joug | yoke |
| 2. Navnîr | boyunduruk beli | bâti du joug | yoke frame |
| 3. Kulabe | boyun çubuğu | baguette du joug | yoke rod or staff |
| 4. Xenîke | boyun çubuğu bağı | anneau de la baguette du joug | ring of yoke rod |
| 5. Kunesima nîr | boyunduruk deliği | orifice du joug | yoke opening |
| Mali | tapan | herse | harrow |
| Baskêşên maliyê | tapan çekme kolları | bras de traction de la herse | harrow's traction arm |
| Mangêr | tarla tırmığı | râteau mécanique | mechanical rake |
| Baskêşên mangêrê | çekme kolları | traverses du râteau | rake's crosspiece |
| Dendikê mangêrê | tırmık dişleri | dents du râteau | rake's teeth or prongs |
| Bose | ucu çapraz halka | anneau à extrémité croisée | ring with overlapping ends |
| Cencer | harman döğme makinesi | batteuse à roues cylindiriques | cylindrical wheel thresher |
| 1-2. Tîrê cencerê | dişli kollar | arbres dentés de la batteuse | thresher's toothed shaft |
| 3-4. Rexê cencerê | kızaklar | traîneaux de la batteuse | wooden or metallic cart used to transport thresher |
| 5-6. Navejeka cencerê | mesnetler | appuis de la batteuse | thresher restbars |
| 7. Dindikê cencerê | kesme dişler | dents des roues | toothed wheels |
| 8. Banê cencerê | sürücü kulesi | cabine de pilotage | driver's cab or seat |
| Gêzîk/gêzî | çalı süpürgesi | balai de bruyère | besom, broom |
| Dirban | tırpan | faux | scythe |
| 1. Destik, bistî | sap | manche | handle, stick |
| 2. Heçî | sapan kolu | poignée de manche | handle |
| 3. Gele | tırpan çenesi | pointe courbée de la faux | curved tip of cythe |
| Das | orak | faucille | sickle |
| 1. Destik | sap | poignée, manche | handle |
| 2. Devê dasê | orak ağzı | lame de la faucille | sickle blade |
| 3. Nikilê dasê | orak ucu | pointe de la faucille | sickle tip |
| Bêr | kürek | pelle | shovel |
| Panika bêrê | kürek ayası | plaque de la pelle | shovel blade |
| Bistîk | kürek sapı | manche de la pelle | shovel stick |
| Mer | bel | bêche | spade |
| ∑ene | çatal | fourche | fork |
| Dirnix | tırmık | râteau | rake |
| Dindikê dirnixê | tırmık dişi | dent de râteau | rake tooth or prong |
| Kurore | darı ekmeği | pain de millet | millet bread |
| Gurz | ot demeti | botte de foin | hay bundle, sheaf, bale |
| Bendeke | ot demetini bağlamaya yarayan ot | tige servant à attacher une botte, lien | stalk used to tie up a |
| Xane : Koma giya ya sed-du sed faxeyî ye | yüz, iki yüz demetlik ot yığın | meule formée de cent à deux cents javelles | stack made up with 100 to 200 swathes |
| Taxe | ot demeti | javelle | swath |
| Las: Giyayê çinî yê berê palekî ye. | bağlanmış ot demeti | brassée | armful |
| Xorim: Koma lasê ye. | laslardan oluşan ot yığını | meule formée de brassées | stack made up with armfuls |
| Doşek: Bi gurzan raxistina binê bêdera cencerê û gêrê ye | discora altına yatay serilen demet yığını | gerbes disposées en forme de matelas sur l'aire de battage | sheaves laid down in shape of mattress on threshing area |
| Darê coxînê. Darikê di nîveka bêderê de ye | harman ortasına dikilen direk | poteau de bois planté au milieu de l'aire de battage | wooden post stuck in centre of threshing area |
| Xeyan: Genimê kutayî yê li dora darê coxîn kom dikin. | direk etrafında toplanan buğday yığını | blés battus amassés autour du poteau | threshed wheat collected around post |
| Werîs | kıldan örme halat | corde tissée en poils de chèvre | rope woven with goat hair |
| Gerdûm | kağnı, öküz arabası | char à böuf | oxcart |
| Kol: taxûk | kızak | traineau | sleigh, sled |
| ∑în: tok | teker çemberi, bandaj | bandage d'une roue | banding of wheel |
| Tilî | ispit | | felloe, fellyrin |
| Memik | ağaç jant dilimi | section de la jente en bois | section of wooden felly |
| Kond | poyra | moyeu | hub |
| Tîr : sirnî | dingil | essien | axle |

# Berhemên şîr

*Amadekar* : Khosrow ABDOLLAHÎ

| BERHEMÊN ŞÎR | SÜT ÜRÜNLERİ | PRODUITS LAITIERS | DAIRY PRODUCTS |
|---|---|---|---|
| Şîr | süt | lait | milk |
| Şîrê xîç / şîrê xav, şîrê zine | doğumdan sonra oluşan ilk sarımsı süt, ağız sütü | premier lait d'une accouchée ou colostrum d'une bête venant de mettre bas | first milk of new mother or colostrum of an animal which just gave brith |
| Xelindor | ilk sütten yapılan mayasız peynir | fromage fabriqué avec le premier lait | cheese made with first milk |
| Firo / zak | ilk üç günlük sütten yapılan maya tutmamış taze peynir | fromage fait avec du lait des 3 premiers jours | cheese made with milk of first 3 days |
| Tawik: Tasika şivanan | çoban tası | bol de berger | shepherd's bowl |
| Serşîr: Serê şîrê xav e. | çiğ süt kaymağı | pellicule crémeuse se formant à la surface du lait straight from the cow | thin layer of cream forming on the surface of milk |
| Mast = qatix | yoğurt | yoghourt | yoghurt |
| Havên =eyvan | maya | présure, ferment | rennet, ferment |
| Meyin | mayalanmak | fermenter | to ferment |
| Meyandin | mayalamak | mettre de la présure | to add rennet |
| To | kaymak | crême, couche crémeuse se formant à la surface du yoghourt | cream, creamy layer forming on the surface of yoghurt |
| Mastê xwarinê | yemek yoğurdu, iyi kaynatılmış sütten yapılır | yoghourt à manger qui est fait avec du lait ayant bien bouilli | solid yoghurt made with well-boiled milk |
| Mastê kilanê | yayık yoğurdu, kaynatılmamış sütten yapılır | yoghourt à baratter fait avec du lait non bouilli qui donne davantage de beurre | yoghurt for churning made with unboiled milk which produces more butter |
| Çeqilmast = mastav | çırpma ayran | yoghourt à boire | liquid yoghurt |
| Dew | yayık ayranı | petit-lait, babeurre | buttermilk |
| Dewmast | ayranlı yoğurt | mélange du petit-lait et du yoghourt | mixture of buttermilk and yoghurt |
| Nivîşk | tereyağı | beurre non fondu | unmelted butter |
| Rûn | yağ | beurre fondu | melted butter |
| Rûnê biharê, rûnê kizinê: | ilk bahar tereyağı | beurre du printemps | spring butter |
| Penêr/penîr | peynir | fromage | cheese |
| Havênê penêr | bir aylık kuzu şirdeninden yapılan peynir mayası | présure faite avec la caillette d'un agneau âgé d'un moi | rennet made of one month-old lamb's rennet bag |
| Penêrê ter | taze, tuzlanmamış peynir | fromage frais non salé | fresh cheese, unsalted |
| Penêrê şoravkê | salamura peynir | fromage saumuré | pickled cheese |
| Penêrê helandî: | eritilmiş peynir | fromage fondu | melted cheese |
| Rîçal | örgülü peynir | fromage fondu et tressé | melted and braided cheese |
| Penêrê eyaran | tulum peyniri | variété de fromage conservée dans des outres | variety of cheese preserved in goatskin |
| Penêrê sîrikê | yabani sarmısaklı peynir | fromage à la ciboulette | cheese with chives |
| Penêrê siyaboyê (reşreşikê) | çörekotlu peynir | fromage à la nigelle | cheese with corncockle |
| Penêrê rijî | yağsız (imansız) peynir | fromage fait avec du lait écrémé | cheese made with skim milk |
| Penêrê pûngê | yarpuzlu peynir | fromage à la menthe sauvage | cheese with wild mint |

**Şûjî**: Ava penêr e ku germ dikin û jê lorik çêdikin.
**Lorik**: Ji şûjiya qusandî çêdibe.
**Çirik**: Penêrê honandî yê ku di ava germ a lorik jê girtî de tê honandin.
**Givik**: Penêrê neparzûnkirî.
**Gidîş**: Ji bona parastina ji ba û baranê bi awake taybetî komkirina gurzan a li nav erd e. Wisa tê birêzkirin ku serê gurzan yê aliyê simbil dikevin hundir, ji derva namînin.

Şîrê xîç / şîrê xav, şîrê cara yekemîn a di pey zayinê de ye, ku rengê wî zerik e. Gava zarûk an berx şîrê xîç pir vexwin bi zikêşê dikevin, nava wan diçe: zarûk vîjikî, heywan tirixî dibin.
Xelindor: Ji şîrê xîç tê çêkirinê.
Şîrê xîç dikelînin, bê havên dimeye, dibe wek penêr. Ku hindik bikelînin penêr nerm, ku pir bikelînin penêr hişk tê.
**Firo / zak**: Ji bo penêr çêkirinê şîrê xîç yê heta sê rojên pêşiyê dikelînin, ku şîr nemeyê, dibe firo.

# Anatomiya Mirov

*(dûmahîka hejmara 7)*

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **45-57. DIL** | **KALB** | **CŒUR** | **HEART** |
| 45. Guhik | kulakçık | oreillette | auricle |
| 46-47.Derîçeyên dil | kalb kapakçıkları | valvules cardiaques | valves of the heart |
| 46. Derîçeya sêniçik | üçlü kapakçık | valvule tricuspide | tricuspid valve |
| 47. Derîçeya duniçik | ikili kapakçık | valvule mitrale | biscuspid valve (mitral valve) |
| 48. Derîçe | kapakçık | valvule | valve |
| 49. Derîçeya şahdemar | aort kapakçığı | valvule sigmoïde de l'aorte | aortic valve |
| 50. Derîçeya xwînbera pişikê | akciğer atardamar kapakçığı | valvule sigmoÎde de l'artère | pulmonary valve pulmonaire |
| 51. Malikên dil (malika çepê, malika rastê) | karıncık | ventricules | ventricles |
| 52. Navbira malikan | karıncık çeperi | cloison interventriculaire | interventricularseptum |
| 53. Xwînhênera sereke ya jorîn | ana toplardamar | veine cave supérieure | superior vena cava |
| 54. Şahdemar | büyük atardamar | aorte | aorta |
| 55. Xwînbera pişikê | akciğer atardamarı | artère pulmonaire | pulmonary artery |
| 56. Xwînhênerên pişikê | akciğer damarı | veines pulmonaires | pulmonary veins |
| 57. Xwînhênera serekeya jêrîn | alt ana toplardamar | veine cave inférieure | inferior vena cava |
| 58. Betanê zik | karın zarı | péritoine | peritoneum |
| 59. Hestiyê kortîxê | sağrı kemiği | sacrum | sacrum |
| 60. Hestiyê boçikê | kuyruk kemiği | coccyx | coccyx |
| 61. Rûviya dawîn, tortorîk | rektum, gödun | rectum | rectum |
| 62. Zotik, pind | anus | anus | anus |
| 63. Masûlka zotikê | anus sfinkteri | sphincter anal | anal sphincter |
| 64. Navran | apışarası | le périnée | perineum |
| 65. Kirkirka rûv | kaşık kemiği | la symphyse pubienne | pubic symphisis |
| **66-77 ORGANÊN CINSÎ YÊN MÊRAN** | **ERİL CİNSEL ORGANLAR** | **ORGANES GENITAUX MASCULINS** | **MALE SEX ORGANS** |
| 66. Kîr | erkek organı, kamış | verge, penis | penis |
| 67. Masûlka repbûnê | dikleşme dokusu | tissu érectile | corpus cavernosum and spongiosum of the penis |
| 68. Mîzî | siyet, üretra | urètre | urethra |
| 69. Serpelî, gupik | erkek temanül uzvu başı | gland | glans penis |
| 70. Çermik | sünnet derisi | prépuce | prepuce |
| 71. Kîsikê gun | taşak torbası | scrotum | scrotum |
| 72. Hêlikê rastê, | sağ taşak | testicule droit | right testicle |
| 73. Serhêlik | erbezi üstü | épididyme | epididymis |
| 74. Riya avikê | spermatik kanalı | conduit séminal | spermatic duct |
| 75. Toşpiya Koper | Cowper bezi | glande de Cowper | Cowper's gland |
| 76. Prostat | prostat | prostate | prostate |
| 77. Kîsikê avikê | sperm torbası | vésicule séminale | seminal vesicle |
| 78. Mîzdank | sidik torbası | vessie | bladder |
| **79-88 ORGANÊN CINSÎ YÊN JINAN** | **DİŞİL CİNSEL ORGANLAR** | **ORGANES GENITAUX FEMININS** | **FEMALE SEX ORGANS** |
| 79. Malzarûk | dölyatağı | utérus | uterus |
| 80. Valahiya malzarûkê | rahim boşluğu | la cavité utérine | cavity of the uterus |
| 81. Xerzerê | yumurtalık kanalı ou de Fallope | trompe utérine | fallopian tube |
| 82. Fimbriyen | fimbria | franges de la trompe | fimbria |
| 83. Xerzdank, hêkdank | yumurtalık | ovaire | ovary |
| 84. Kîsikê hêkêpîstik, xaşik xerz | kesecik | follicule ovule | follicle ovum |
| 85. Gewriya malzarûkê | yumurtacık | col de l'utérus | os uteri externum |
| 86. Quz | dölyolu | vagin | vagina |
| 87. Lêvên quz | | lèvres du vagin | lip of the vulva |
| 88. Gilik, nêrik, zilik | bızır | clitoris | clitoris |












hejmar 9 havîn 1991

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

# HESP

*Amedekar* : Mizaffer BEGZADE

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| 1-38 hesp | at | morphologie du cheval | points of the horse |
| 1-11 serî | baş | tête (la tête du cheval | head (horse's head) |
| 1- guh | kulak | oreille | ear |
| 2- tûmik, tûncik | perçem | toupet | forelock |
| 3- enî | alın | front | forehead |
| 4- çav | göz | œil | eye |
| 5- rû | yüz | face | face |
| 6- difin, poz, bêvil | burun | chanfrein | nose |
| 7- firnik | burun deliği | naseau | nostril |
| 8- lêva jorî | üst dudak | lèvre supérieure | upper lip |
| 9- dev | ağız | bouche | mouth |
| 10- lêva jêrî | alt dudak | lèvre inférieure | underlip (lower lip) |
| 11- guhişk, alûş, alçîmek | atın alt çenesi | ganache | lower jaw |
| 12- patik | ense | nuque | crest (neck) |
| 13- bijî | yele | crinière | mane (horse'smane) |
| 14- çema stû | | encolure | crest (horse's crest) |
| 15- stû | boyun | cou | neck |
| 16- gewrî | boğaz | gorge | throat |
| 17- sermil | | garrot | withers |
| 18-27 lingê pêşîn,dest | ön ayak | membre antérieur | forehand |
| 18- şepîlk, pol | omuz | épaule | shoulder |
| 19- sîng, pêxîl | göğüs | poitrail | breast |
| 20- binçeng | dirsek | coude | elbow |
| 21- mil | bilek | avant-bras | forearm |
| 22-26 zend | | pied antérieur | forefoot |
| 22- çok | diz | genou | knee (carpus, wrist) |
| 23- zend | | canon | cannon |
| 24- qevdik, xirtik | | boulet | fetlock |
| 25- gûzek | bukağılık | paturon | pastern |
| 26- sim | | pied (sabot) | hoof |
| 27- goçke | | châtaigne, un durillon | chestnut (castor), a callosity |
| 28- demara mehmûzê | | veine thoracique externe | spur vein |
| 29- navpişt | sırt | dos | back |
| 30- masulka, piş | | reins | loins (lumbar region) |
| 31- qorik | sağrı | croupe | croup (rump. crupper) |
| 32 - kulîmek | kalça | hanche | hip |
| 33-37 - lingê paşî | arka ayak | membre postérieur | hind leg |
| 33- çok | | grasset | stifle (stifle joint) |
| 34- qurma dêlê | but | attache de la queue | root (dock) of the tail |



# CIVÎNA BIHARA 1991AN

Civîna nehemîn a li ser zimanê kurdî, zaravayê kurmancî ji 25ê gulanê ta 1ê hezîranê, li Swêdê, li xwendegeha Biskops Arnöyê civiya. Civîn giraniya xebatên xwe da ser lêgerîna peyvên hin afirandinên klasîk û nûjên ên kurmanci : *Nûbara Ehmedê Xanî* (Sedsala XVIIan), *Adet û Rusûmatê El Ekrad* (Sedsala XIXan), Memê Alan, Dîwana Duwem a Cegerxwîn, kovarên *Roja Nû* û *Stêrk* (Salên 1940an), Dîwana Tîrêj. Tevî vê lêkolîna bingehîn ji bo vejîndina dewlemendiyên kêmnas ên zimanê me beşdarên civînê li ser hin gotinên jiyana rojane (hesp û mirîşk) û li ser pirsên rêzimana kurdî jî xebitîn. Em encamên van xebatan di vê hejmarê de belav dikin. Hevalên ku beşdarî civîna bihara 1991an bûn, ev in : Lutfî Baksi (Xerza), Rojen Barnas (Diyarbekir), Mizaffer Begzade (Şikakan), Huseyin Kurdo (Amûd), Kendal Nezan (Diyarbekir), Zinar Soran (Mêrdîn), Elî Şêr (Wan), Mehmet Uzun (Siwêrek), Veysi Zeydanlî (Bedlîs), Zeynelabidîn Zinar (Batman) û Reşo Zîlan (Agirî).

KURMANCÎ

# LI SER RASTNIVÎSÎNA ÇEND TIŞTAN

(II)

*Reşo ZÎLAN*

### 3. Rastnivîsîna pirtikên bi *bê* û *ne* -yê

Di zaravayê kurmancî de daçeka «**bi**»-yê xwedî çend maneyan e. Wek daçekekê maneya wê ya bingehîn tev, tevî, di gel, pê re, pêrebûn û refaqetkirin e.Bi alîkariya vê daçekê çend daçekên hevedudanî jî tên saz kirin, ku di pêkhatinên weha de rola «**bi**»-yê pêşdaçek e. Ev pêşdaçek çu caran bi peyva berî xwe yan jî bi dû xwe ve nayê zeliqandin. Ew hertim serbixwe û cihê tête nivîsîn. Paşdaçekên ku daçekên hevedudanî pêk tînin jî, ku «**de**, **re**, **ve**» ne, divê wek «**bi**»-yê cihê û serbixwe bêne nivîsîn.

Ev çend nimûne ne ji bo daçekên sade:

*Tu hîna **bi** kurdî nizanî!*
*Balafira me hê **bi** hewayê neketiye.*
*Ewî pere **bi** bêrîka xwe xist.*
***Bi** min, ev ne tiştekî qenc e.*
*Tu **bi** ya min bike, guh mede xelqê.*
*Mendoyê bêbext ew **bi** kuştin da.*
*Ez **bi** şivan bûm.*

Ev jî çend nimûne ne ji bo daçekên hevedudanî:

*Mêvan dê **berbi** êvarê bêne malê.*
*Karwan **ber bi** destê sibehê derkete rê.*
*Devê şûşê **serbi** jêr meke, ser**bi** jor bike!*
*Ne ku ez, lê **biser de** ew ji me dixeyîde.*
*Ji duhî **û bi virde** ez di nivînan de me.*
*Kinc û solên min **bi** avê **de** çûn.*
*Min dît, ku hin serbaz **ber bi** gund **ve** diçûn.*
*Tiştekî **bi** ser **ve** zêde meke!*
*"Axa, **bi** deh gundiyên xwe **ve**, bawer dike ku Keyxosrow e".*
*Şagirt **bi** mamoste **re** çûn çolê.*
*Nasnameya wî ne **bi** wî **re** bû.*
***Bi** derenceyan **re** hilkişiya taqa didiwan.*

Herweha **bi** dikare rola forma alaviyê (enstrûmental) jî, ango çêkirin yan jî bûna tiştekî bi riya yan jî bi alîkariya alav û amrazekî (alet, hacet, enstrûment), bîne cîh. Bo nimûne:

*Ez çayê **bi** şekir vedixwim.*
*Ajda **bi** otomobîlê diçe çarşiyê.*
*Hestî **bi** kêrê nayên hûr kirin.*
*Wî destên xwe **bi** sabûnê şûştin.*
*Cendirme dixwazin me **bi** darê zorê bînin rê.*
*Dîwarên odeyê **bi** keviran hatine çêkirin.*
*Welat navê xwe **bi** qelemê nivîsand.*
*Wî **bi** galegalê serê me bir.*
*Pirto **bi** destê Nevzad hat kuştin.*
*Min ew pere **bi** destên xwe spartin wî.*
*"Yek heye, **bi** sedî; sed heye, **bi** yekî".*
*"Dinya **bi** dor e, ne **bi** zor e".*

*Ka de tu* ***bi*** *navê Xwedê sond bixwe!*

Ji bilî vê, **bi** dikare bibe hoker jî. Heke **bi** bi rola hokerê rabe jî divê ew bi tena serê xwe bête nivîsîn. Heçî **bi**-ya hoker e, ew ji bo darîçavkirina çawan û herweha kînga, di çi zemanî de qewimîna bûyerekê ye. Wek:

*Wê* ***bi*** *dizîka ji kurê xwe re got.*
***Bi*** *rastî ez ne di wê baweriyê de me.*
***Bi*** *roj ba dihat,* ***bi*** *şev jî baran.*
*Zimanê wî roj* ***bi*** *roj qelstir dibe.*
*Wî* ***bi*** *temamî dest ji kurdîniyê berdaye.*
*Ez ê ji te re* ***bi*** *tenê gotinekê bibêjim.*
*Hevind* ***bi*** *vî awayî nikare bixwîne.*
*Ez ê ne* ***bi*** *siwarî, lê* ***bi*** *peyatî bêm.*
*Tu* ***bi*** *qencî jê re bibêje, ne* ***bi*** *xerabî.*
*Hevraz her* ***bi*** *carekê derew dikirin.*
*Em* ***bi*** *saetan li benda te man.*

Herwekî ku di hevokên jorîn de jî diyar dibin, rola **bi**-yê, ji bilî ku ew hoker e, temamkera lêkerê (verbal attribut) ye jî. Ango **bi**, naveroka hevokê bi alîkariya lêkeran temam dike. Gava ku em li hevoka *Wê bi dizîka ji kurê xwe re got* dinihêrin, em dibînin ku di vê hevokê de peyva *bi dizîka* bi rola hokerê radibe. Ew bi me nîşan dide, ku diya wî kurikî bi çi awayî, bi çi rengî bi kurê xwe re peyiviye. Heke em pirsa *Wê çawan ji kurê xwe re got?* ji hevokê bikin, dê bersiva pirsa me *bi dizîka* be. Ne xwe, *bi dizîka* hoker e. Lê belê, pirtika ku di vê hevokê de lêkerê temam dike, **bi** ye. Bêî bikaranîna **bi** -yê, em nikarin lêkera di vê hevokê de, ku *got* e, temam bikin. Ji lewre jî em jê re dibêjin ev **bi**, temamkera lêkerê ye. Ji ber vê yekê jî divê ev **bi** bi tena serê xwe bête nivîsandin.

Carina jî **bi** bi rola pêşpirtikê radibe û di forma îzafeyê de tête bi kar anîn. Di rewşên holê de, divê em **bi**-yê ji peyva ku bi dû wê re têt, veneqetînin û wan bi hev re binivîsin. Wek:

*Xwarina* ***bi****rûn dijminê tenduristiya me ye.*
*Kebaniya* ***bi****zarok xwe vedihisîne.*
*Heval mirovekî* ***bi****bext e.*
*Ev bizina me heywanekî* ***bi****goşt e.*
*Ciwan goştê* ***bi****bez hez nedikir.*
*Destgirtiya wî yeke* ***bi****naz e.*
*Hêmîn xwarinên* ***bi****tam çêdike.*
*Xortên* ***bi****kezeb ji gundê me derketine.*
*Geliyên* ***bi****dar xemla welêt in.*

Wek xuya ye, di nimûneyên jorîn de rola **bi** -yê pêşpirtik e. Ew hatiye pêşiya peyvekê, jê rengdêreke nû afirandiye. Ev rengdêra nû jî bûye temamkera navdêrekê yan jî bernavekê. Divê bête gotin, ku rengdêrên weha çêkirî, gelek caran îdyomên nû pêk tînin û ji aliyê naverokê ve, maneyeke nû diafirînin. Herwisan, **bi** -yên pêşpirtik yên bi vî rengî, pirî caran maneya *heyî, heye, xwedî/xwedan* yan jî maneya paşpirtika *-dar* didin naveroka peyva di gel xwe. Ango: Birûn = rûndar, rûnheyî.
Bizarok = ducanî.
Bibext = xwedîbext.
Bigoşt = goştdar, goştheyî.
Bibez = bezdar, bidon, birûn.
Binaz = nazdar.
Bitam = tamdar, biçêj, çêjdar.
Bikezeb = wêrek, mêrxwas.
Bidar = dar lê heye.

Tiştên ku me di warê rastnivîsîna **bi** -yê de gotin, bi giştî, di warê rastnivîsîna **bê** -yê de jî derbas dibin. Ji ber ku ferqa di navbera **bi** û **bê** -yê de, bi tenê ji aliyê naverok û maneyê ve ye. Ne ku ji aliyê rêzimanî ve. Ji aliyê rêzimanî ve rola herdukan jî yek e. Lê belê, herwekî tête zanîn, ew ji aliyê mane û naverokê ve du pirtikên bervajiyên hev in. Heçî **bê** ye, ew di maneya tunebûn, pêrenebûn û hwd de ye. Ew ji peyva *bêyî* hatiye kurt kirin û bûye **bê**. Car caran dibe **bêî** jî. Ew, nemaze gava ku di gel gehîneka *ku*, yan jî bi tena serê xwe di maneya hayjêtunebûn, tunebûn û bihevrenebûnê de tête bi kar anîn, dibe **bêî**.

Ev in çend nimûne ji bo rastnivîsîna **bê** -yê.
Ne bi hev re:

*Ez çayê* ***bê*** *şekir vedixwim.*
***Bê*** *guman ev tiştên te gotî, rast in.*
*Duhî ez* ***bê*** *pere çûbûm dikanê.*
*Goşt* ***bê*** *bez e, ji te re baş e.*
*Wî cînarê xwe* ***bê*** *sebeb bi hêrs kir.*
*Ez ê qewlê xwe* ***bê*** *gotin bînim cîh.*
*Çi bikim,* ***bê*** *bext im, şansê min tune ye!*

Bi hev re:

*Koçer mirovekî* ***bê****bext e.*
*Dibêjin ew bi derdekî* ***bê****derman ketiye.*
*Meyweyên* ***bê****tam nayên xwarin.*
*Mirovê* ***bê****kar divê li kar bigere!*
*Xwarina* ***bê****pere bi destê her kesî nakeve.*
*Penêrê* ***bê****îman nedihate xwarin.*
*Ev bîr, bîreke* ***bê****binî ye.*
*Cira hevalê te yê* ***bê****rû ne xweş e.*
*Tu dê ji kû mirovekî* ***bê****deng bibînî?*

Çend nimûne ji bo rastnivîsîna **bêî** -yê:

*Ew* ***bêî*** *min nabe.*
*Êzdîn* ***bêî*** *xanima xwe naçe serdana xelqê.*
*Ew* ***bêî*** *ageha mamosteya xwe derketine hewşê.*
***Bêî*** *ku cînaran bihisîne, mala xwe bar kiriye.*
***Bêî*** *ku tu bizanibî, me pereyên xwe hiltanîn.*

Heçî rastnivîsîna pirtika **ne** -yê ye, qaîdeyên ku ji bo rastnivîsîna **bi** û **bê** -yê derbas dibin, divê ji bo rastnivîsîna pirtika **ne** -yê jî derbas bibin. Berî her tiştî, pirtika **ne** -yê, pirtikeke neyîniyê ye. Ji bo pêkanîna raweya neyîniyê tête bi kar anîn. Me dil nîne, ku em li vir dîsan li ser raweya neyînî û qaîdeyên ku ji bo wê derbas dibin, rawestin. Ji ber ku me li ser vê pirsgirêkê di hejmara 5-an ya KURMANCÎ de, ku di havîna sala 1989-an de hatiye weşandin, bendeke taybetî nivîsîbû. Ji ber vê yekê jî, em ê bi tenê bi kurtî ji **ne** -ya ku mirov bi hev re dinivîse, çêl bikin.

Qaîdeyên ku di warê rastnivîsîna **ne** -yê de derbas dibin, herwekî yên **bi** û **bê** -yê ne. Ango, her çi gava ku rola **ne** -yê bibe temamkera lêkerê, divê ew cihê bête nivîsîn. Lê heke rola **ne** -yê bibe pêşpirtik û ew di gel peyva bi dû xwe re rengdêreke nû yan jî îdyomekê biafirîne, divê ew bi hev re bête nivîsîn. Wek:

Ne bi hev re:

*Heyam niha êdî* ***ne*** *sar e.*
*Eylo* ***ne*** *kurapê min e, lê kurmetê min e.*
*Ew ê ku telefon kiribû,* ***ne*** *ez im.*
*Doktor dibêje ku ew* ***ne*** *kunêr e.*
*Hingê Efrasyab* ***ne*** *rengkorî bû.*
*Mircan* ***ne*** *yara Keleş e, yara Kawe ye.*
*Ew camêrê ku tu dibêjî,* ***ne*** *merd e.*

Bi hev re:

*Miraz ne mirovekî dewlemend e,* ***ne****dar e.*
*Zagros* ***ne****yarê me hemûyan e.*
*Gelo kîjan doktorî ev* ***ne****xweş muayene kiriye?*
*Ewî ne duayên qencan, lê duayên* ***ne****qencan kirin!*
*Mem û Zîna Xanî yê* ***ne****mir sertaca edebiyata me ye.*
*Camêrên* ***ne****merd yên wek te, nehatine rûkalê dinyayê.*
*Mîha me jî û çêleka me jî* ***ne****zok in.*
*Kesê* ***ne****heq divê cezayê xwe bibîne.*

| | | | |
|---|---|---|---|
| 35- ramê stûr | bacak | cuisse | haunch |
| 36- ranê zirav | dirsek | jambe | gaskin |
| 37- çevok | | jarret (la pointe du jarret) | hock |
| 38- dêl, qemçik, boçik | kuyruk | queue | tail |
| 39-44- meşa hespan | at yürüyüşleri | allures | gaits of the horse |
| 39- qedem, meşa nerm, rêveçûn | yürüyüş | pas | walk |
| 40- rewan | rahvan | amble | pace |
| 41- loq | tırıs | trot | trot |
| 42- gurloq | | galot | canter (hand gallop) |
| 43-44- çargaviya nerm | hafif dörtnala | petit galot | canter |
| 43- çargav, çarnal | dörtnala | galot | gallop |
| 44- çargaviya mişt | hücum dörtnala | grand galot | full gallop |
| temen, emr | yaş | âge | age |
| şîre, 1 salî | 1 yaşına kadar | jusqu'à 1 an | less than 1 year old |
| bîrye 2 salî | tay | poulin | foal |
| cohnî, canî | 1 ile 2 yaşları arası | âgé de 1 à 2 ans | between 1 to 2 years old |
| nuhzîn, 3 salî | 2 ile 3 yaşları arası | âgé de 2 à 3 ans | between 2 to 3 years old |
| qute, 4 salî | 3 ile 4 yaşları arası | âgé de 3 à 4 ans | between 3 to 4 years old |
| dêlberdayî, 5 salî, | 4 ile 5 yaşları arası | âgé de 4 à 5 ans | between 4 to 5 years old |
| hesp, ji 5 salî pê ve | at (5 yaşından sonra) | cheval (à partir de 5 ans) | horse (5 years od or more) |

nîşana 5 saliyê ew e ku du diranên pehn hene, dibêjin enaf.
nijdî kirin, di 5 saliyê de ku ji bona hesp dêla xwe baş hilde jor, hinekî ji dêla wê/wî dibirin.

**RENGÊN HESPAN**

| | | | |
|---|---|---|---|
| reşbez | koyu gri | gris foncé | dark grey |
| sorboz | demir kır | aubère | strawberry roan |
| şînboz | çelik grisi | gris bleu | blue grey |
| kumêt | doru | bai, e | bay |
| zerkumet | kule | isabelle | light-tan (horse) |
| qule | sekili at | balzan | (horse) with white stockings |
| qemer | yağız | brun | brown |

FERHENGOKA
# ROJA NÛ

Amadekar : Reşo ZÎLAN

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| kiryarî | abone ücreti | abonnement | subscription |
| kiryar | abone | abonné (e) | subscriber |
| kiryar (bikir), kirîdar, kiryox | alıcı | client, acheteur | client, buyer |
| bişûndemayîn | gerikalma | arriération | backwardness |
| xwe di ser re zer kirin, xwe di ser ve çeng kirin | aşmak | franchir | to cross |
| navtêdan | kışkırtma, tahrik | provocation, incitation, instigation | provocation, incitement, instigation |
| lêsorkirin, lêtûjkirin | kızıştırma | excitation | excitement |
| bîrewer | aydın | intellectuel | intellectual |
| xweser | bağımsız | independant | independent |
| xweserî | bağımsızlık | indépendance | independance |
| heyîn | varlık | existence | existence |
| bîr birin, bîr lê birin | düşünmek, tahmin etmek, değerlendirmek | penser, évaluer, tenir compte | to think, to evaluate, to take into account |
| lebat, endam | uzuv | membre | member |
| xerabe, kavil, wêran, dêris, xirbe | harabe | ruine | ruin |
| bi dar ve kirin | idam etmek | pendre | to hang |
| yekîne | birlik (askeri) | unité (militaire) | unit (military) |
| bombeavêj, bombavêj | bombardıman uçağı | bombardier | bomber |
| sozwinda | sözünü tutmayan | qui ne tient pas parole | who doesn't keep his word |
| qipçe kirin | kenetlemek | cramponner, attacher | to clamp, to fasten, to tie |
| neqeb | geçit, gedik, ara | passage, brèche | passage, breach, gap |
| mamik, tiştonek, qelpik, têderxistinok | bilmece | devinette | riddle |
| noqav | deniz altı | sous-marin | submarine |
| bin av kirin | batırmak | couler, faire plonger | to sink, to plunge sthg into |
| baskordî | kolordu | corps d'armée | army corps |
| sinçî, sincî | karakter, ahlak | caractère, habitude | character, habit |
| sermed | ebedi | éternel | eternal |
| sermedî | ebediyet | eternité | eternity |
| fermandar | komutan | commandant | commander |
| serfermandar | başkomutan | commandant en chef | commander-in-chief |
| serfermandarî | başkomutanlık | commandement en chef | commandement-in-chief |
| topên balafirşikên | uçaksavar topları | artillerie anti-aérienne | anti-aircaft artillery |
| nûçegihan | muhabir | correspondant | correspondent |
| zirehpûş,zirîpoş | zırhlı | cuirassé | battleship |
| navhincî, navincî | orta büyüklükte | moyen | middle sized |
| ardû | kuru yakacak | combustible solide | solid combustible |
| sotemenî | yakıt | carburant, combustible | fuel |
| tasa şihînê | terazi kefesi | plateau d'une balance | scales pan |
| şihîn, şehîn | terazi | balance | scales |
| penah | barınak | abri | shelter |
| pê dan erdê | direnmek | résister | to resist |
| berfende, aşît, renî, renû, herez, basû, şepe, horyes | çığ | avalanche | avalanche |
| pûn: pûyin, debax kirin | sepilemek | tanner | to tan |
| nav hilanîn | zikr etmek | mentionner | to mention |
| leylan | serap | mirage | mirage |
| seyandin (dûtin) | sıvamak | enduire | to coat |
| bi cezbê ketin | (tarikat ehli için)kendinden geçmek | entrer en transes | to go with a trance |
| cezbe | kendinden geçme | transe, extase | trance, ecstasy |
| serguzeşt | serüven | aventure | adventure |
| komgirav | takımada | archipel | archipelago |
| gehînek | aşama, merhale | étape | stage, stop |

| | | | |
|---|---|---|---|
| serfirazî | zafer | victoire | victory |
| heyman, qelandin,tov birandin | yok etmek | exterminer | to exterminate, to wipe out |
| bijarte, bijare | seçkin, seçilmiş | choisi, distingué | select, distinguished |
| dirêjî.... kirin | saldırmak, hücum etmek | attaquer, assaillir | to attack, to assault |
| sermiyan | başkan, lider | président, chef | president, chief |
| têkilî... bûn | karışmak | intervenir, s'immiscer | to intervence, to interfere |
| çeleng | çevik, cesur, hareketli, yakışıklı | vivant, alerte, agile, beau | alive, alert, agile, lively, beautiful |
| şehreza | becerikli, yetenekli,bilgili | avisé, habile, adroit, talentueux | sensible, skilful, dexterous, skilled, gifted |
| dîdevan | gözcü | surveillant, sentinelle | sentry, watchman |
| dîdevanî | gözcülük | surveillance, garde | watch, surveillance |
| nîkbîn, çakbîn | iyimser | optimiste | optimist |
| nîkbînî, çakbînî | iyimserlik | optimisme | optimism |
| bedbîn | karamsar | pessimiste | pessimist |
| bedbînî | karamsarlık | pessimisme | pessimism |
| armanc | amaç, ereç, hedef | but, objectif, cible | goal, objective, target |
| qad | saha, meydan, alan | terrain, champ, place | ground, field, place |
| qada şer | savaş alanı | champ de bataille | battle-field |
| qada dahatinê | iniş alanı | terrain d'atterrissage | landing ground |
| alan | yankı | écho | echo |
| alan dan | yankılamak | répercuter, produire un écho | to echo |
| bi hewa ketin | havalanmak | prendre l'air, s'envoler | to take off, to fly away |
| nuhirandin | mırıldanarak şarkı söylemek | fredonner | to hum |
| torin | asil, yakışıklı | noble, beau | noble, handsome, beautiful |
| narincî | turuncu | orangé, châtain clair. | chestnut, light biswin, reddish |

sincok : benî, meşlûr, sincûx, kome
kesme : helîl

F E R H E N G O K A

# Nûbara Ehmedê Xanî

*Amadekar* : Zeynelabidîn ZINAR
Nûbar di sala 1683 an de hatiye nivîsîn.

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| gerew, graw | 1) rehin 2) karşılık | 1) gage 2)contre-partie, contre-valeur | 1) pawn 2) compensation |
| ziyan | hasar | dommage, perte | dammage, harmn, loss |
| derew | yalan | mensonge | lie |
| şilîl | çavdar | seigle | rye |
| to | kaymak | crème | cream |
| bet | toy | outarde | bustard, Canada goose |
| zîv | gümüş | argent | silver |
| paxir | bakir | cuivre | cooper |
| risas, zirinc | kurşun | plomb | lead |
| qela | kalay | étain | tin, pewter |
| ejnû | diz | genou | knee |
| sîng | göğüs | poitrine | chest, breast |
| ran | baldır | cuisse | thig |
| didan (diran) | diş | dent | tooth |
| lêv | dudak | lèvre | lip |
| xasma: nexasim, nemaze | özellikle | particulièrement, spécialement | particularly, especially |
| bajar | şehir | ville | city, town |
| dirav | para | monnaie, argent | money |
| ermûş | îpek | soie | silk |

| | | | |
|---|---|---|---|
| mehder | şefaet | intercession | intercession |
| mehdervan | şefaatkar | intercesseur | intercessor |
| rewal: bêmû | tüysüz | imberbe | beardless |
| hilû | pürüzsüz | lisse | smooth |
| biçûk | küçük | petit | small |
| mak | ana, anaç | mère, matrice | mother, matrix |
| asîman | gök | ciel | sky |
| mey | şarab | vin | wine |
| meyxwer | şarapçı | buveur de vin | wine drinker |
| hinarî | gönderilen, elçi | envoyé | envoy |
| bêgav | mecbur | obligé | obliged, complelled |
| bêgavî | mecburiyet | obligation, nécessité | obligation |
| gor | mezar | tombe | grave |
| hinar | nar | grenade | pomegranate |
| gilyaz | kiraz | cerise | cherry |
| hejîr | incir | figue | fig |
| kuncî | susam | sésame | sesame |
| bih | ayva | coing | quince |
| kundir | kabak | courge | marrow, squash |
| penîr | peynir | fromage | cheese |
| poxîn: genimê qelandî û hûrkirî | kavut | blé frit | fried wheat |
| keşk: çortan | kurut | grumeaux de babeur sechés pour l'hiver | buttermilk lump dried for winter |
| heban | dağarcık | sacoche | food bag |
| girr, debax | tabak | tannage | tanning |
| hevrê | yoldaş | compagnon, camarade | companion, mate |
| pîşe | meslek | métier, profession | occupation, craft, profession |
| kevan | yay | arc | bow |
| kêşik | yay kirişi | corde d'un arc | bow's string |
| tîr | ok | flèche | arrow |
| leşker | asker | soldat | soldier |
| cuwamêrî | cömertlik | générosité | generoisity |
| nijde | devriye | patrouille | patrol |
| mêrînî | mürüvet | magnanimité, générosité | magnanimity, generosity |
| lawînî | gençlik | jeunesse | youth |
| pêşû | sivrisinek | moustique | mosquito |
| pojan | yavşan otu | véronique | speedwell, veronica |
| pûng | yarpuz | menthe sauvage | wild mint |
| superng (siping) | yemlik otu | salsifis des prés | goats beard |
| kaxez | kağıt | papier | paper |
| penbû | pamuk | coton | cotton |
| bêheya | hayasız | effronté | shameless, impudent |
| riswayî | rezil | infâme, vil | vile, infamous |
| evîn | aşk, sevgi | amour | love |
| yar | dost | ami,e | lover |
| kewden | görgüsüz, cahil, düşüncesiz | écervelé, idiot rustre, goujat | churl, loot, boor co-spouse |
| hewî | kuma | co-épouse, lien de parenté entre les épouses d'un polygamme | |
| têkil | karışık | mélangé, embrouillé, désordonné | mixed-up, muddled, disorderly |
| ask | geyik | cerf | stag, hart |
| bîşe | çalılık | bosquet, buisson | copse, grove |
| bardar | yüklü | chargée, enceinte | loaded, laden, pregnant |
| avis | hamile | grosse, enceinte | pregnant |
| mafûr | halı | tapis | rug, carpet |

| | | | |
|---|---|---|---|
| mey | şarab | vin | wine |
| hêvî | umut | espoir | hope |
| hêvînemayî | umutsuz | désespéré | hopeless |
| asin | demir | fer | iron |
| pola | çelik | acier | steel |
| biraştî | izgara, şiş ya da ya da fırında pişmiş | rôti | roast |
| ta | tel | fil | thread, wire |
| taze | taze | frais | fresh |
| belg | yaprak | feuille | leaf |
| xêvet | büyük çadır | grande tente | large tente |
| kon | çadır | tente | tente |
| vîn | îrade | volonté | will |
| şên | kudret, iktidar | pouvoir | power |
| ala | bayrak | étendard, drapeau | flag, standard |
| durû | ikiyüzlü | hypocrite, faux-jeton | hypocritical |
| qerd | maymun | singe | monkey |
| zengil | çan | cloche | bell |
| dojeh | cehenem | enfer | hell |
| perestin | ibadet | adoration | adoration, worship |
| sertilî | başparmak | pouce | thumb |
| mîdad | murekkep | encre | ink |
| lengî | topal | boiteux | lame |
| verêhtin | boşaltmak | vider, verser | to pour, to empty |

PEYVÊN

# Dîwana Tîrêj

*Amadekar: Zinar SORAN*

| **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|
| heyam, dem, dewr | devir, çağ, dönem | temps, époque, période | time, epoch, period |
| geşt, ger | seyran, kır gezintisi, piknik | promenade à la campagne | walk, stroll in countryside |
| lenger | 1) köprü ayağı 2)çapa demiri | 1) pilier d'un pont 2) ancre | 1) pillar 2) anchor |
| koh, çiya | dağ | montagne | mountain |
| pesar, berpal | bayır, yamaç | côteau | hillside, slope |
| panav, deşta bilind a rast | yüksek ova | plateau (de montagne) | plateau |
| lat | masif kaya, uçurum | rocher, précipice | rock, chasm |
| xunav | çişeleme, çiy, şebnem | rosée | dew |
| çirisandin | ışıldatmak | faire luire | to polish, to shine |
| çirisîn | ışıldamak | luire, étinceler | to gleam, to shine |
| perwaz | kanat çırpma, uçuş | envol, battement d'ailes | flight, taking wing |
| lek | 1) 10.000 kişi 2) küme | 1) 10.000 individus 2) foule | 1) 10.000 peuples 2) crowd |
| cobar | dere | ruisseau, cours d'eau | stream, brook |
| bestîn | bağlamak | attacher, lier | to bind, to tie up, to link up |
| sîpah | ordu | armée | army |
| çilak | ince uzun değnek | baguette fine et rectiligne | rectilinear stick |
| çilakî | ince uzun | droit, rectiligne | straight |
| vîn, viyan | irade, istek | volonté | will |

| | | | |
|---|---|---|---|
| şeg | değnek, hokey değneği | baguette, crosse de hockey | hockey stick |
| helestin, rabûn | kalkmak | se lever | to wake up |
| hedan | sabır | patience | patience |
| sawêr | hayal | imagination | imagination |
| şermîsar | mahcub | honteux, humilié | shameful, ashamed |
| mişt | silme dolu | à ras bords | to the brim |
| piyam, peyam | mesaj | message | message |
| destbeste | elpençe | soumis le doigt sur la couture | fully obedient |
| geda | dilenci | mendiant | beggar, mendicant |
| qaş (kevirê bi qîmet) | yüzük taşı | pierre sertie | precious stone, gem |
| nigîn, gustîl | yüzük | bague | ring |
| rewa | nem | humidité | humidity, dampness |
| qad, cî, meydan | meydan, alan | place, champ | place, field |
| şehneşîn | balkon | balcon | balcony |
| zernegar | altın işleme | brodé d'or | embroidered with gold |
| şeng | canlı | vivant, plein de vitalité | lively, vivid |
| pêjin, dengê kerr | hisetme, gürültü, yankı | signe, signal, bruit, écho | sign, signal, noise, echo |
| pejina te nayê | senden haber yok, görünmüyorsun | tu ne donnes pas de signe de vie | there is no news from you |
| kalan | kılıf | fourreau, gaine | sheath |
| dax | dağlama | cautérisation | cauterization |
| çeleng | çevik, çalışkan, canlı | agile, vif, leste, diligent | agile, nimble, sprightly |
| êl | boy, il | tribu | tribe |
| koçemal : tevahiya malê | ailenin tümü | toute la famille | all family |
| nik, cem, ba | nezdinde, yanında | chez | at, in |
| kavil | virane, harabe | ruine | ruin |
| tak û tûk, yekoyek | tek tük | rarement | rarely |
| pepûk | guguk kuşu | coucou | cuckoo |
| pertew, şewq, tîrej | ışın | rayon | ray |
| jana zirav | verem | tuberculose | tuberculosis |
| kovî | yabanî, evcilleştirilmemiş | sauvage, non domestiqué | sauvage wild |
| pêxwas | baldırı çıplak | va-nu-pieds | tramp |
| guft û goy | sohbet | causerie, conversation | talk, chat, conversation |
| tax | mahalle | quartier | quarter, neighbourhood |
| tevger, bizav | hareket | mouvement | movement, motion |
| pêşewa | önder | leader | leader |
| serwer | ulu önder, hükümdar | souverain | sovereign |
| rav, 1) nêçîr 2) sef | 1) av 2) saf | 1) chasse 2) rang | 1) hunting 2) row, line |
| kam | dilek, arzu | désir | desire |
| xifş, ximş, karxezal | ceylan yavrusu | faon, daguet | fawn, brocket |
| xûz | kambur | bossu | hunchbacked |
| nependî | gizli | en cachette | on the sly, secretly |
| xeml û xêz | zinet, süs eşyası | parure, ornement | ornament, jewels, finery |
| qûntar | dağ eteği | flanc de montagne | slope |
| berpal | bel | versant de coline | hillside |
| baq | demet | bouquet | bunch |
| hov | vahşi | sauvage, fauve | wild, wildcat |
| rêç, şop | iz | trace | track |
| pîkolî, pêkolî | eşeleme | action de piaffer | stamp |
| pêkolî kirin | eşelemek | piaffer | to stamp, to paw the ground |
| kêl, kevirê çikandî | dikili taş, mezar taşı | borne, pierre tombale | milestone, tombstone |
| kotek | zor | force, coercition | coercion |
| şevgêr | harami | brigand opérant la nuit | brigand acting by night |
| ban | dam | toit | roof |
| liq | şube | section, branche | section, branch |
| rex | donanım | agrès, cartoucherie | apparatus, cartridge belt |

| | | | |
|---|---|---|---|
| bîdar, şiyar | uyanık | éveillé, vigilant | awake, vigilant |
| dilawer, dilêr | yiğit | brave, vaillant | brave, valiant, galant |
| hêvisîn | nakış işlemek | broder | to embroider |
| çogan, darê gogê | polo değneği | crosse | crook, crocier, stick |
| vajî | ters | envers, à l'envers | wrong side, inside out |
| çox | çuha | drap | woolen cloth |
| kemxa | bir nevi ipek kumaş | soie de Damas | silk of Damascus |
| mexmer | kadife | velours | velvet |
| mircan | mercan | corail | coral |
| şêrgele | aslan sürüsü | troupeau de lions | herd of lions |
| têz | çakmaklı tüfeklerde ateşleme fitili | mèche du briquet de fusil | wick of a rifle |
| şewl | fundalık | broussailles | brushwood |
| pişk | kura, nasib | lot, part | prize, share, lot |
| pişk avêtin | kura çekmek | tirer au sort | to draw lots |
| best | heves, ilham | inclination, désir, inspiration | desire, inclination, inspiration |
| salar | baş kumandan | commandant en chef | commander in chief |
| serbaz | er, nefer | soldat | soldier |
| darsêpî | sehpa, idam sehpası | gibet, potence | gallows |
| arbeşk | çakmak taşı | silex | flint |
| axivîn | depreşmek | récidiver (maladie) | to recur |
| deliyan | kamaşmak | s'éblouir | to bedazzle |
| terez, zîpik | dolu | grêle | hail |
| bahoz | fırtına | tempête | storm, tempest |
| hilmiştin, rapêçayin | çemremek | se retrousser | to hitch up, to turn outwards |
| bengîn | tutkun, sarhoş | amoureux passioné | passionate |
| kelax | leş | charogne | carrion |
| gornebaş | bir sırtlan cinsi | une variété de hyène | a variety of hyena |
| keftar | sırtlan | hyène | hyena |
| sermed | ebedi | éternel | eternal |
| sermedî | ebediyet | éternité | eternity |
| pêwend | bağ, ilgi | lien, liaison, relation | link, linkage, relation |
| qirş û qal | çer çöp | brindilles | twig |
| moran | pus | brouillard | fog, mist, smog |
| çepel | çirkin | laid | ugly |
| şabaşî | şükür, ikram | grâce, louange | praise, grace |
| ceban | mezarlık | cimetière | cemetery |
| hoşîn | sendelemek | tituber | to stagger |
| delav | yalak | abreuvoir | watering place |
| rewrewk | gözleri kararma, sanrı | hallucination | hallucination |
| hilçinandin | 1) çekip koparmak 2) örmek onarmak | 1) extirper 2) ravauder, repriser | 1) to eradicate, to extirpate 2) to darn |
| sergerdan | şaşkın, başı dönen | étourdi, désorienté | heedless, scatter brained |
| zîtin | eğirmek | filer | to spin |
| peng | iplik çilesi | écheveau | skein, hank |
| gilde | yumak | pelote | (wool) ball |
| keşkûl | keşkül, dilenci çanağı | obole | mite, offering, obol |
| gezo | kudret helvası | manne, exsudation végetale | manna |
| temara mirinê | ölüm uykusu | sommeil de la mort | deep sleep |
| rêl | küçük orman | bois | wood |
| berokaş | yokuş yukarı | pente ascendante | uphill |
| şîp | iniş, çağlayan | chute d'eau, cascade | waterfall, cascad |
| babîsok, babelîsk | hortum | tourbillon | whirlwind |
| bagêr | kasırga | ouragan, bourrasque | hurricane, storm |
| nirx | narh, değer | prix, valeur | price, value |
| hok: girêka ku vebûna wê hêsan e. | çözülmesi kolay düğüm | nöud facile à défaire | knot easy to undo |

| | | | |
|---|---|---|---|
| îşk*, îşk dan | sıkıştırmak (yük) | comprimer, presser | to squeeze, to press |
| gulî | püskül | houppe | tassel, tuft |
| rîşî | saçak | frange | fringe |
| mexmer: elba mezin a darîn | tahtadan yapılmış büyükçe kap | grand récipent en bois | large wooden bucket |
| navkil, kêrî | yayık germe tahtası | baguette servant à tendre la baratte en outre de chèvre | stick which serves to brace a goatskin used as churn |

------------

* îşk : darê ku pê piştiyek, barek tê şidandin.

# Termên rêzimanî

| **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **înglîzî** |
|---|---|---|---|
| termên rêzimanî | gramer terimleri | termes grammaticaux | Grammatical terms |
| alfabe, f. | alfabe | alphabet | alphabet |
| tîp, f. | harf | lettre | letter |
| girdek, f. | büyük harf | majuscule | Capital (letter) |
| hûrek, f. | küçük harf | minuscule | small letter, lower case |
| dengdar, f*. | ünlü, sesli | voyelle | vowel |
| dengdara dirêj, f. | uzun ünlü | voyelle longue | long vowel |
| dengdara kurt, f. | kısa ünlü | voyelle courte | short vowel |
| bêdeng, f. | ünsüz, sessiz | consonne | consonant |
| dudeng, f. | iki ünlü, diftong | diphotngue | diphtong |
| sêdeng, f. | üçünlü, triftong | triphtongue | triphtong |
| kîte, f. | hece | syllabe | sylabble |
| yekkîte, f. | tek heceli | monosyllabe | monosylabble |
| dukîte, f. | iki heceli | dissyllabe | disylabble |
| sêkîte, f. | üç heceli | trisyllabe | trisylabble |
| kîtandin | hecelemek | épeler, syllabe par syllabe | to spell syllabble by syllable |
| pirkîte, f. | çok heceli | polysyllabe | polysyllable |
| tîpandin | harfi harfine yazdırmak | épeler lettre par lettre | to spell leter by letter |
| ra, f. | kök | racine | root |
| rader, m. | masdar | infinitif | infinitif |
| bêje, peyv, f. | sözcük, kelime | mot | word |
| bêjeya guhêrbar, f. | değişken sözcük | mot variable | inflectional word |
| bêjeya neguhêrbar, f. | değişmez, değişken olmayan sözcük | mot invariable | unvariable, uninflectional word |
| bêjeya sade | yalın sözcük | mot simple | simple word |
| bêjeya hevedudanî | bileşik sözcük | mot composé | compound word |
| pêşdanî, f. | önek | préfixe | prefix |
| paşdanî, f. | ardek | suffixe | suffix |
| eyletbêje, f. | sözcük topluluğu | famille de mots | words family |
| serbixwe | bağımsız | indépendant | independent |
| serbixweyî | bağımsızlık | indépendance | independence |
| piçûkker | küçültücü | diminutif | diminutive |
| erînî | olumluluk | affirmative | affirmative |
| neyînî, f. | olumsuzluk | négation, négative | negative |
| hevedudanî, f. | bileşik | composé | compound |
| hevmane, f. | eşanlamlı | synonyme | synonymous |
| hevdeng, m. | eşsesli | homonyme | homonymous |
| dijmane | karşıt anlamlı | antonyme | antonymous |
| devkî | sözlü | oral | oral |
| nivîskî | yazılı | écrit | in writing |
| nimûne | örnek | exemple | example |

| | | | |
|---|---|---|---|
| rêziman | gramer | grammaire | grammar |
| rêzimana kurdî | Kürtçe grameri | grammaire kurde | Kurdish grammar |
| navdêr, m. | isim (grammer) | substantif | noun, substantive |
| nav, m. | isim | nom | name |
| serenav, m. | özel isim | nom propre | proper noun |
| hevenav, m. | cins isim | nom commun | common noun |
| komenav, m. | nom collectif | topluluk ismi | collective noun |
| navê hevedudanî, m. | bileşik isim | nom composé | compound noun |
| jimar | sayı | nombre | number |
| jimarnav, m. | sayı adı | numéral | numberal |
| tekane, m. | tekil | singulier | singular |
| pirane, m. | çoğul | pluriel | plural |
| zayend, f. | cins | genre | gender |
| mê, f. | dişil | féminin | feminine |
| nêr, m. | eril | masculin | masculine |
| nêtar, f. | nötr | neutre | neuter |
| nêtari, f. | nötrlük | neutralité | neutrality |
| rastnivîsîn, f. | imla | orthographe | orthography |
| spehînivîsîn, f. | güzel yazı yazma sanatı | calligraphie | calligraphy |
| tof, f. | grup, küme | groupe | group |
| awa, m. | hal, durum | cas | case |
| tewandin, f. tewang, f. | büküm | déclinaison | declension |
| tewandin (bitewîne !) | bükümlemek | décliner | to decline |
| kes, m. | şahıs | personne | person |
| kesê yekemîn | birinci şahıs | première personne | first person |
| kesê duwemîn, m. | ikinci şahıs | deuxième personne | second person |
| kesê sêyemîn, m. | üçüncü şahıs | troisième personne | third person |
| rengdêr, f. | sıfat | adjectif | adjective |
| rengdêra çawahîn, f. | niteleme sıffatı | adjectif qualificatif | qualifing adjective |
| rengdêra nîşandanê, f. | işaret sıfafı | adjectif démonstratif | demonstrative adjective |
| rengdêrra jimarîn, f. | sayı sıfatı | adjectif numéral | numeral adjective |
| rengdêra pirsiyarkî, f. | soru sıfatı | adjectif interrogatif | interrogative adjective |
| pronav, m. | zamir | pronom | pronoun |
| pronavê kesîn, m. | şahıs zamiri | pronom personnel | personal pronoun |
| pronavê pirsiyarkî, m. | işaret zamiri | pronom interrogatif | interrogative pronoun |

* Di xebatên xwe yên rêzimanî de Mîr K. A. Bedir Xan *dengdar* ji bo *bêdeng* ango bîseda ya farisî [(t) : sessiz, (f) : consonne] bi kar aniye û ji bo *sedadar* a farisî [(t) ünlü, (f) voyelle] jî *dengdêr,* dixebitîne. Ji ber pêşî li tevliheviya navbera *dengdar/dengdêr* bê girtin û ji bo bikarin van mefhuman bi awayekî sadetir bi zarokên kurd bidin hîn kirin, Civîna ziman termên jorîn helbijart.

## JI KLASÎKÊN KURDÎ

# Ferhengoka Dîwana Cegerxwîn

-II-

*Amadekar* : Khosrow ABDOLLAHÎ

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| **kulah**: kum | külah | bonnet | cap, bonnet |
| raborî | geçmiş, mazı | passé | past |
| şax: çiya | dağ | montagne | mountain |
| diyar: bilindahî | yükseklik | hauteur | height |
| fexfexe: xwe nepixandin | övünme | pavanement, fanfaronade | strutting about, bragging |

